## Naverok

## Pêşgotin

Di esmanê helbesta kurdî da, stêra nayab a helbestvanê gewre Ehmedê Xanî wekî gewhersedefekê diteyise.

Xanî ne tenê helbestvan bû lê belê ew rewşenbîrê çax û dema xwe bû. Wekî helbestnivîsekê kurd ku zimanê wî yê dayikê di nav zimanên serdest ên li hawirdorê da bênirx û bêqîmet bûbû, wî dikarî mîna rewşenbîrên dema xwe bi erebî yan bi farisî binivîsa, belam wî rêya sengistanê girt û berê xwe da kurdîyê; ev dane û şahkar li pey xwe ji mêr û jin û zarokên kurdan ra hêlan.

Xanîyî di hizir û helbestên xwe da tenê xizmeta miletê xwe kirie ye. Wekî ku rêberekê netewî be, di kirasê helbestvanekî da, doza serwerî û serfirazîya gelê xwe kiriye.

Ji alîyê şêweyê ve, Ehmedê Xanî hemû teql, kêşan û pêlawazên kurdîyê di helbestên xwe da hewandine û bi nav kirine. Bi vî awayî, wî asoya pêlawazan bi firehî li ber helbestvanên li dûv xwe vekiriye.

### Rêbaza xebat û rastandinê

Wekî helbestvanekê kurd ê misilman ê di sedsala 17an da, bi sedan gotinên erebî, farisî û tirkî li ser ziman û ristên Xanîyî gerîyane û ji ber ku kurdan -her wiha tirk û farisan- di wê demê da tîpên erebî bi kar tanîn, gelek tîpên ku di kurdîya îro da tunene di nav helbestên wî ra buhirîne, lewra em naçar bûn ku hin dirûvên taybet û sembolên nû ji wan dengan ra bibijêrin da ku xwendina helbestan rast û dirust be.

Ev dirûv, sembol û tîp jî ev in:

| | |
|---|---|
| Ş/ş | ص |
| Ḏ/ḏ | ض |
| Ṯ /ṯ | ط |
| Ẕ /ẕ | ظ |
| Ḧ /ḧ | ح |
| ' | ع |
| Ẍ / ẍ | غ |
| Ḋ/ḋ | ذ |
| T̈ /ẗ | ث |
| ° | الهمزة (ء) |

Her wiha me hin guhertinên din pêk anîn ku pîvana wan hevsengî, wate, mentiq û zelalkirin bû. Ji nav wan guhertinan:

- **Me hin caran tîpek zêde dikir ku malik bê wê şikestî dima yan jî me tîpek diavêt ku hebûna wê teqla malikê dişikand.**
- **Em li çend nusxeyan vedigerîyan û me gotina guncawtir a ji nav wan malikên ku ew gotin tê da ciyawaz bû hildibijart.**
- **Me hin helbestên berguman der kirin, çiku bê hûrnêrîn di hin nusxeyan da hatibûn derbaskirin.**
- **Me malikên erebî û farisî bi rênivîsîna kurdîyê û ewên tirkî/osmanî bi rênivîsîna tirkîya nûjen nivîsîn.**
- **Me çend nîşe û têbînî li jêr çend malikên şikestîmayî nivîsîn û her wiha li jêr wan malikên ku bi du awayên dirust di nusxeyên curbicur da hatine.**

Jixwe cihê dax û mixabinîyê ye ku piranîya berhem û kevnenivîsên kurdan nehatine parastin û yên ku gihane ber destên me jî, an netemam an jî guhertî û pêlîstî gihane. Li vir jî em dibînin ku hin helbestên Xanîyî bi dirustî negihane me û meriv carinan ji ber gotin, malik û helbestên nakok û nedirust ên di destnivîsên cihêreng da şaş û mat dimîne.

Çavkanîyên ku me xwe di lêveger û hûrnêrîna berhemên giştî yên seyda Xanî da spartine wan ev in:

- Koma berhemê Ehmedê Xanî, Tehsîn Ibrahîm Doskî, Komelgeha Ferhengî ya Ehmedê Xanî, Soran, 2018
- Mem û Zîn, Ehmedê Xanî, amadekar: Huseyn Şemrexî, Weşanxaneya Nûbiharê, Stenbol, 2017.
- Mem û Zîn, Ehmedê Xanî, şirovekirin û vekolîn: Emînê Osman, Çapxaneya El-cahizê, Bexda, 1990
- Dîwan, Ehmedê Xanî külliyatı IV, analiz ve çeviri: Kadri Yıldırım, Avesta, İstanbul, 2014
- Nûbihara Biçûkan, Ehmedê Xanî, piştrastkirin û şirovekirin (bi zimanê erebî): Hemdî Ebdilmecîd El-selefî, çapxaneya El-reşîdê, Bexda, 1990

- Ehmedê Xanî (Hemû berhem), Weşanên Lîsê, Amed, 2019
- Şerha dîwana Ehmedê Xanî (Felsefe û jiyana wî), Abdurrahman Durre, Weşanxaneya Avestayê, Stenbol, 2002
- Şîroveya Mem û Zîna Ehmedê Xanî, şîrovekar: Perwîz Cîhanî, Weşanxaneya Nûbiharê, Stenbol, 2013

Kêm zêde, di wan jêderan de, kêmanî û şaşîtî peyda bûne, nemaze ji alîyê teql û kêşana helbestan. Jixwe çend sedemên van kêmanîyan hene. Yek jê ew e ku Xanîyî helbestên xwe bi hostayî li gor gelek pêlawazên curbicur û kêmpeyda ristine ku ev awa kêm di nav kurdan da hebûn. Sedemeka din jî ew e ku yek destnivîsa piştrastkirî bi xeta Xanîyî nîne û destnivîsên nusxenivîsan di gelek cihan da hev nagirin û carinan zêde ji hev dûr in.

Ev komberhema Ehmedê Xanî ji çar beşan pêk tê:

- "Nûbihara biçûkan" ku ji bo zarokên kurdan nivîsîye da ku wan bi rengekê helbestî fêrî zimanê erebî bike.
- "Mem û Zîn"a ku navdartirîn dastana evînê ya kurdan e û Xanîyî ew bi şêwaza xwe ya bêhempa hûnaye.
- "Eqîdeya îmanê" ku tê da bi rist û helbestan şiroveya dînê islamê ji kurdan ra dike.
- "Dîwan"a ku helbestên mayî yên Xanîyî tê da hattine komkirin.

Ji bilî van berhemên ku me li jorê behsa wan kir û di vê komberhemê da civandin, hin çavkanî behsa berhemeka bi navê "'Eqîdeya islamê" dikin, lê belê lihevkirineka giştî li ser piştrastkirina vê berhemê nîne û gelek çavkanî dibêjin ku ev berhem ne ya Ehmedê Xanî ye, lewra me ew berhem nexistiye nava vê pirtûkê. Hêjayî gotinê ye ku gorbehişt Celadet Bedirxan jî di hejmareka Hawarê da behsa berhemeka winda ya Xanîyî ya bi navê "'Erdê Xweda" dike û dibêje ku ew pir li wê berhema stêrnasî û erdnîgarîyê gerîyaye lê bi dest nexistiye.

Para zêde ya vê xebata me giranî daye dirustkirina teql û kêşana helbestên Xanîyî, çiku li gor şopandin û xwendina beşekê mezin ê berhemên li ber destan, me dît ku hemû nusxenivîs, xebatkar û şirovekaran kêmanîyên mezin di kêşana helbestên Xanîyî da kirine. Me jî hewl da –li gor hêz û zanîna xwe- van kêmanîyan derbas bikin. Gelo em çiqasî di vê yekê da bi ser ketine? Ev nirxandin a xwîner û lêkolînerên hûrbîn e.

Dawîya gotinê, em kêfxweş û bextewer in ku em -piştî xebat û westîyaneka zor- vê nusxeya berhemên giştî yên Ehmedê Xanî -ku em hêvîdar in kêmşaşîtî be- li pirtûkxaneya kurdî zêde bikin û bigihînin ber destê xwînerên kurd ên hêja.

Ibrahîm Xelîl, Rojavayê Kurdistanê, havîna 2021ê

**Bismil-lahî-r-reḧmanî-r-reḧîm**
**Mebde°ê her 'ilmekî navê 'elîm**

Ḧemd û ẗena° û şukranî, ji bo wî xaliq û reḧmanî,

ku fešaḧet û beyan daye lisanî, lisan daye insanî,

hindî šelewat in hemî, li resûlê me yê ummî,

ku bûne peyrewêd wî, 'ereb û 'ecem û kirmanc û romî,

ji paş ḧemd û šelewatan, ev çend kelîme ne ji luẍatan,

vêk êxistin Eḧmedê Xanî, nav Nûbihara Biçûkan danî,

ne ji bo šaḧibrewacan, belkî ji bo biçûkêd kirmancan,

wekî ji Qur°anê xilaš bin, lazim e li sewadê çavnas bin,

da bi van çend reşbelekan, li wan ṯebî'et û melekan,

derê zihnê vebîtin, herçî dixûnin zeḧmet nebîtin,

umêd e ji ṯifalan, ku me 'emelbeṯalan, di weqtê dewr û dersan,

bikene in'am û iḧsan, bi du'an ve bîr bînin, fatiḧan ji me ra bixwînin.

**(Beḧr: Hezec mekfûf meḧdûf)**

Ḧetta tu dewr û dersan nekey tekrar û mešrûf
Di dunyayê tu nabî ne meşhûr û ne me’rûf

(Mefa’îlun fe’ûlun mefa’îlun fe’ûlun)
Çi xweş wezn e bibîtin hezec mekfûf û meḧdûf

Xudê (Ellah) e, qašid (resûl) e, ey xudêzan
Xelîfe çar û hem çar îmam in ey musilman

Ji çaran yêk Ebabekr, ’Umer, Usman e, ê dî
’Elî ye bê tekelluf ku bû xatem ji bo wan

Divêtin tû bizanî bi dil navêd imaman
Muḧemmed, Malik, Eḧmed ewê dîtir ke Nu’man

Mubeşşer bûne deh kes ji ešḧaban bi te’yîn
Ku dê biçne beḧiştê Xudê mizgînî da wan

Ji ewwel bû ’Ubeyde di gel her çar-i yaran
Se’îd û Se’d û Ṯelḧe, Zubeyr û ’Ebdireḧman

Li me ferḏ e bizanîn resûlê xwe bi teḧqîq
Bi mewlid hem bi medfen, binasîn da û baban

Di Mekkê bû ji dayê, Medîne bûye medfen
Wî 'Ebdillah e walid, Emîne walde bizan

Ji dunyayê ku çû wî 'umir bû şêst û sê sal
Ji şêstan pênceh û sê bwarin di Mekkeyê dan

Di çil salî risalet ji bo ra hate xwarê
Di bîst û sê dimayî ji bo nazil bû Qur'an

Cemî'ê ummeta wî bi lutfa xwe Îlahî
Ji dunyayê virêkî bi Qur'an û bi îman

Ḧetta ew şehsiwar bêt û goya ummeta xwe
Ji meydana ḧisabê helînit şubhî çûkan

**(Beḧr: Recez meṯwî mexbûn)**

Perde ku rabitin ji ber, 'arḏî dilistan e xweş
Dil ji ẍeman ku bête der, bulbulî gulistan e xweş

(Mufte'ilun mefa'ilun, mufte'ilun mefa'ilun)
Beḧrê recez ku xebn û ṯey, ger bibitin rewan e xweş

(Zewc) û (recul) çi mêr û jin, (mer°et) e (zewcet) e (nisa)
(Walid) e bab û (walidet) da, û (şeqîq) û (ex) bira

(Ibin) kur e û (bint) kiç e, (šihr) xezûr e mam e ('em)
('Emmet) met e, ('emamet) şaş, (ceddet) çi ye? Xwe pîreda

(Ucret) kirê û (rehn) gerew, (xesr-) ziyan e, (kiḋb) derew
(Bey')-i firohtin e, ('eṯa) dan û kirîn çi ye? (Şira)

(Menkib) û ('iṯfe) her du mil, (bal) û (ḏemîr) û (qelb)-i dil
(Ceḋl) û (fereh) çi şahî ne, (mewt)-i mirin, girîn (buka)

(T̈ewr) û (ḧimar) ga û ker e, ban çi ye? (Seqf) û (bab) der e
(Cebhet) enî û (fem) dev e, (liḧyet) rih in, xeber (neba)

(Ḧinṯet) genim, (şe'îr) ceh e, (sult) şilêl e, (kerm) rez e
Xurme (ruṯeb), ('ineb) tirî, (bi') bifiroş, (ẗemen) biha

Şîr e (leben), (ẍenem) pez e, (raib) e mast û (zubde) tû
(Šûf) e hirî û (rîş) per e, (ešfer) e zer, kefî (qeba)

(Šeršer) û (rîh) e ba bizan, toz û (’ecac) û (neq’) e hem
(Ẍebre) û (heyc) û (hebwe) û (fešṯel) û (qetre) û (heba)

(Caẗiye) tirs û (ša’iqe) deng û birûsk û bêhişî
(Lewẗ) û (liwa) ’elamat in, (beẗẗ)-i ẍem in, hem eşkera

(Xerš) e direw, (meẍîḏ)-i dew, (beṯ) çi ye? Qaz, (qebc) e kew
(Şeṯṯ) kinar e, (nehr) e cû, (lewḧ) û (sukak) û (cew) hewa

(’esced) û (’eyn) û (neḏr) e zêr, (fiḏḏe), (luceyn) û (nuqr) e zîv
Sifr çi ye? (Mefreq) e, (nuhas) paxir e, hem (rišaš) qela

(Rubbe) û (rubbema) gelek, (ẗemme) li wê, (huna) li êr
(La) ne, (lena) ji bo me ra, (în) eger e, (lîme) çira

(Eyne) li ko û (keyfe) ku, (tehte) li bin, (’ela) li ser
(T̈umme) ji paşî, wê bizan, (ente) tu, (lî) ji bo mi ra

### (Beḧr: Remel meḧdûf)

’arifê ko bi qencî me’rûf-i bit
Dê ḧelîm û šabir û mewqûf-i bit

(Fa’ilatun, fa’ilatun, fa’ilat)
Wezn ev e ḧîna remel meḧdûf-i bit

(Z̲il) û (teb’) û (fey˚) sih in û (şems) e t̲av
Deşt e (beyda), (meşye) çûn e, (xut̲we) gav

(Nar) e agir, (ḧerr) e germî, (berd) e sar
(T̈elc) e berf, û (ma˚) û (selsel) herdu av

(Wabil) û (wesmî) û (midrar) û (met̲er)
(T̲ell) û (ẍeyẗ) û (rihm) e baran, (ẗad) xunav

(Ricl) e pê û (rukbe) ejnû (bet̲n) e zik
(Šedr) e sîng, û (cîd) e ist̲û, (’eyn) e çav

(Fexđ) e ran û (d̲irs) didan e, (şeffe) lêv
(Z̲ehr) e pişt û (surre) navke, (cewf) e nav

(Kibd) cerig, û (kilye) gurçî, (kudne) bez
Rûvî ye (em’a), (meraret) hem zerav

(Ḏîq) e tengî, (qišr) e kurtî, (ṯûl) dirêj
(Ẍilẕet) û (diqqet) sitûrî hem zirav

(Qidr) e dîz, û (qeš’e) kase, (xubđ) e nan
(Leḧm) e goşt, û (ṯebx) e pahtin, (ney˚) e xav

(Şeb’) e têrî, (’eṯş) e têhnî, (cû’) e birs
(Šeyḧ) e gazî, (šewṯ) e deng û (ism) e nav

**(Beḧr: Recez muẗemmen salim)**

Ger dê te meqŝûdek hebî lazim divê lê bî bi lez
Xasma te me'bûdek hebî di emrê wî da daim bibez

(Mustef'ilun mustef'ilun mustef'ilun mustef'ilun)
Salim muẗemmen her ev e, ey t̠alibê beḧra recez

Hatim (eteytû) (atî) têm, wê hat (eta) (îtî) were
(Ateytû) min da, (xud̈) bigir, (irci') veger, (id̈heb) here

(Ic'el) bigêr, (isḧeq) bihêr, (id̠rib) biqut, (inz̠ur) binêr
(Iqre˚) bixûn, (i'lem) bizan, (îman) bi me'na bawer e

(Miŝr) û (beled) bajêr in ew, (dirhem) dirav, ermûş (ḧerîr)
(Maniḧ) sexî, (sail) recûkar e, (şefa'et) mehder e

(Imlaq) xizanî ye, (ẍina) maldarî, û hem (istiran)
(It̠laq) e berdan, (t̠elq) e zan, (zewc) û (witir) cot û fer e

(Ekyes) mirovê tîjfehim, (eŝme') mirovê guhbiçûk
(Ekşem) mirovê guhbirî, (eŝleḧ) wekî (eyhem) kerr e

(Ekḧel) mirovê çavbikil, (eşhel) mirovê çavbelek
(Eşqer) mirovê çavhişîn, rengê genimgûn (esmer) e

(Emred) riwal, (efre') bimû, (eqre') keçel, (emles) hilû
(Ešẍer) biçûk, (ekber) mezin, (seyid, ħulaħil) mîrser e

(Um) mak e, (ummuş-şemle) roj, (ummun-nucûm) e asiman
(Ummul-ẍebaiť, xemre) mey, (mudmin) mudamî meyxwer e

(Ummul-fedail) 'alimî, (ummul-rredail) cahilî
(Ummul-qira, Ummul-bilad) Ke'be, (nebî) pêẍember e

**(Beḧr: Recez murffel)**

Herçî bi ’ilmî cehl kir mubeddel
Şifrê xwe wî bi zêr kir mukellel

(Mustef’ilatun, mustef’ilatun)
Beḧra recez bû çi xweş mureffel

(Exder) çi? Kesk e, (eḧmer) çi? Sor e
(Ezreq) hişîn e, (cewreb) çi? Gore

(Ṯewd) û (cebel), (ṯûr) her sê çiya ne
(Wadî) newal e, (ḧufret) çi? Kore

(Mersûl) hinarî, (medfûn) veşarî
(Mecbûr) e bêgav, (mucber) bizor e

(Ebkem) çi? Lal e, (e’rec) çi? Leng e
Yekçav e (e’wer), (ekmeh) xwe kor e

(Meqtûl) e kuştî, (meẍsûl) e şuştî
(Meyyit) mirar e, (merqed) xwe gor e

**(Behr: Mudari' exreb)**

Ey tûy ku kibr-i daim te j`boy xwe kirye merkeb
Ewwel tu (B)ê bike (Y)ê paşî bigêre merkeb!

(Mef'ûlu fa'ilatun mef'ûlu fa'ilatun)
Xweş wezn e bê melal e ger bit mudari' exreb

(Rumman) hinar, û (culnar) gêlas, û (tîn) hijîr e
(Qitta°) xiyar, û (dûfed) pîvaz, û (tewm)-i sîr e

(Tuffah) e sêv, û (simsim) kuncî, û bih (sefercel)
(Dubba°) û (qer') û (yeqtîn) kundik, (cubin) penîr e

Poxîn (sewîq), (iqit) keşk, henban (cirab), û gir (curb)
(Meşhûn) tejî, we (xawî) vala, we (risl)-i şîr e

(Muzn) û (sehab) we ('arid), (xeym) û (xemame) 'ewr in
(Qemqam) û (yemm)-i behr in, (šemšam, husam)-i şîr e

(Beyda, felat), û (sebseb), (feyfa°) û (bedw)-i deşt in
(Yenbû') û ('eyn) e kahnî, (cubb) û (qelîb)-i bîr e

(Ibnus-sebîl)-i rêwî, hevrê (refîq) û (šahib)
(Muzcat) e hindik, û pur (cemm), û (lubed) ketîr e

('ebd) û (reqîq) e kole, (ȟirfet, šenî'e) pîşe
(Cahil) nezan, û zana ('ellam) û hem (xebîr) e

('ewcan, ȟeniyye, šefra, qews û qisî) kevan in
(Wefd̲) û (kinane) kîşik, (nebl) û (nişab)-i tîr e

(Ceyş) û (ȟeşem) çi? Leşker, (isra) bi şev li rê bir
(Basil) çi? Mêr û necde (serriye), (qîl)-i mîr e

**(Beḧr: Remel meqŝûr muẗemmen)**

Şêx û ŝûfîtî keramet ’ilm e û xwendin ’emel
Xelwet e ḧucre teṟîqa te şeṟî’et bê xelel

(Fa’ilatun fa’ilatun, fa’ilatun fa’ilat)
Xweş tu vê beḧrê bixûn lewra ku xweş çûne remel

(Şeyx) e ṟîspî, (şeyb) e pîṟî, (şab) ciwan û (şe˚n) e ḧal
(Murwet) e mêṟînî, lawînî (futuwet), (kehl) e kal

(Meqt) e buẍḏ û (be’ḏ) e hindik, (buḏ’) e ferc û (biḏ’) e çend
(Sefk) û (sekb) û (ŝebb) e ṟihtin, (qetl) e kuştin, şer (qital)

(Ru’b û rehb û hewl û wehl û feşl û wecl û rew’) e tirs
(Reb’) êwirgeh, (rec) hijandin, (fecc) e rê, pirsîn (sual)

(Kewn)-i bûn û (ẕe’n)-i çûn, û (şeq) kelaştin, (deq) qutan
(Dewḧe) dar, û (rewḧ) e raḧet, (rewḏe) çîmen, (ress) e çal

(Beqq) e pêşû, (wec’) e êş, û (re’şe) lerzîn, derd e (da˚)
(Dif˚) e germî, (bu’d) e dûṟî, (beẍl) e hêstir, (ne’l) e nal

(Şeyḧ) e pwîjan-i, (ḧebeq) pûng e, we (ḧermel) çi? Supend
(Qiṯṯ) e kaẍed, (quṯn) e penbû, (wiqr) e bar, û (lud) cewal

(Mencenûn) gerdûn, û (mecnûn) dîn, û (macin) bêĥeya
(Xizy) e riswayî, û (xidlan) şermkirî, şerm (infi'al)

(Šerĥ) e koşk, (šerxet) û (šire) gazî, û (xullet) evîn
(Xill) e yar, û (xelwe) tenha, (ĥulw) e şîrîn, (murr) e t̲al

(Mirr) e quwet, (wemq) e muĥbet, (uns) û (ulfet) hogirî
(Ẍumr) û (beld) û (kelt) e kewden, (be'l)-i mêr, û gan (bi'al)

(D̲erre) hêwî, û (d̲iẍn) e kîn, û (d̲iẍẗ) e têkil, (z̲eby) e ask
(D̲ecce) gazî, (d̲elle) windabûn û windabûyî (d̲al)

(Lehce) ezman, (luhce) têşt, û (mehc) e rûbî, (muhce) rûĥ
(Behce, ĥusin) û şahî û jêhatin, û (behrec) bet̲al

(Xeml) e rîşî, (xebt̲) e lêdan, (xemt̲) e dara bistirî
('ecwe) xurme, gurze (ĥuzme), ('urwe) qulp û ('inde) bal

(T̲el'et) û (wech) û (muĥeyya) û ('arid̲) û (menz̲er) çi? Rû
(Eyke) bîş e, text (erîke), (zeyẍ) e meyl, û (beyt) e mal

(Ĥamil) e bardar, û (ĥubla) avis, û qoriẍ (ĥemî)
(Ĥimye) pawan, (ĥulye) xişr, û (ĥilye) zînet, (ĥewl) e sal

(Qat̲ibe) û (cumle) we (kull) û (kaffe) hemmî, (keffe) men'
(Šedde) ew reng (lewn) e reng, û (hemse) deng û (bukm) e lal

(Merre, kerre, tare) carek, (bekk) û (dekk) û (šek) kutan

(Bunye, Bekke) ke'be, palgeh (mutteke°) û (tekye) pal

**(Besîṯ meṯwî)**

Ger te divêtin bibî mîr û ser û mu'teber
Kiđb û xilafê mebêj ger te dikin ker bi ker

(Mufte'ilun fa'ilun mufte'ilun fa'ilun)
Meṯwî ye beḧra besîṯ lê bike carek neẕer

(Şeml)-i belavbûn e hem vêkketin e (şemle) ber
(Zerbiye) mafûr e hem (ṯenfese) ey ba xeber

(Qe'berî) û ('ebqerî) bê ṯeb' û ṯeb'et, xweş in
(Qefqef) u (qerqef) mey in, (kûze) u (fexxar) e cer

(Ḧeẕ) u (xelaq) û (nešîb, meqsem) û (huššet) e par
(Fešm) e birîn, (šerm) e jî (kesf) u wisan (qit'e) ker

(Hereb, hezîme) revîn, (qerḧ) u (ciraḧe) birîn
(Ḏidd) u ('edû) dijmin in, (ḧerb) u (weẍa) herdu şer

(Zuḧziḧe) dûrbûyî bû, (uzlife) ḏiḏê wî ye
(Efleḧe) gerya xilaš, (šeld) e qewî, (šexr) e ber

(Ḧinṯ) u (cunaḧ) û (ḧerec), (wizr) u (webal) û (đunûb)
(Iṯme) guneh, (ẍeyẕ) e kerb, (kurb)-i ẍem in, (re's) e ser

(Irb) u (weṯer, ihtiyac) hewceyî, hîvî (emel)
(Sem’) e bihîstin, (bešer) dîtin u fekrîn (nez̲er)

Hîvînemayî kî ye? (Mublis) û (ayis, qenûṯ)
Asin u pola çi ne? Herdu (enîẗ) û (ḋeker)

(Eqbele) ber da, wekî (edbere) pişt da, (qubul)
Pêşî, û paşî (dubur), (uḋn) guh e, (eṯreş) e kerr

(Ḋewb) e bihatin, (đeneb) dûv e, biraştin (şewî)
(Şat) e pez û (ḏe˚n) e mih, (me’z) e bizin, (hecme) ker

(Beyḏet) e hêk, (melḧ) e xwê, (maḧ) e sipî, (muḧ) zerik
(Ḧey)-ye xweş û (ḧeyye) mar, (cuḧr) e kun, û ber (ḧecer)

(Turb) û (turab) û (semad), (rems) û (ruẍam) û (ẗeed)
(’efr) û (bera) û (ẗera) ax in, u (šefwan) e ber

(Qurṯ) e guhar, û (sîwar) bazin, u (rakib) siwar
(Racil) u (maşî) peya, (menṯiqe, minṯeq) kemer

(Mirfeqe) û (musnede) palgeh, u (me’cer) kulah
(Miqne’e) û (miqreme) meḧreme, û (hame) ser

(Tibn)-i çi? Ka, û giya (’uşb) u (kele˚) û (ḧeşîş)
(Ẍušn) u (efanîn) e ṯa, taze (ṯerî), (reṯb)-i ter

(’irq) e reh, û (fer’) e çiq, belge (wereq), (bed̈r) e tov
Dar e (şecer), (qet̠f) e ber, fêqî ye (t̠el’) û (ẗemer)

**(Hezec exreb muẗemmen)**

Herçî ku ji dunyayê berdaşitedamen bû
Bê şubhe di nêv ’amê efraşitegerden bû

(Mef’ûlu, mefa’îlun mef’ûlu, mefa’îlun)
Wezna hezeca exreb ev renge muẗemmen bû

(Merbûṯ) e wekî (me’qûd), (me’qûl) e girêdayî
(Mektûm) e wekî (meknûn), (mexbû˚) e veşêrayî

(Mişkat) e kulek, (mir˚at) neynîk e, çira (mišbaḧ)
(Wehhac) û (munewwer) hem (durrî) ye biruhnayî

(Menşûr) e wekî (menẗûr), (mebẗûẗ) e belavbûyî
(Qisṯaṯ) terazû ye, (mewzûn) çi ye? Kêşayî

(Mewûde) keça hêj xweş, daynayî di nêv qebrê
(Mewqude) bidarkuştî, (metrûke) licihmayî

(Neḏḏaxetan) ew herdu wê hildikelin j`avê
(Mudhammetan)-i herdu reş bûne pur avdayî

(Ḋahib) çi ye? Ê çûyî, (musteqbel) e ê bêtin
(Maḏî) çi ye? Ê borî, (baqî) çi ye? Ê mayî

(Edxaî) e wekî (emşac) têkel bune, xewn (ehlam)

(Muzzemmil) û (muddettir) ê cil di xwe werdayî

(Esfar) û (zubur) herdû cem'êd-i kitêban in

(Merqûm) e wekî (mektûb), (mezbûr) e nivîsayî

**(Recez meṯwî mutemmen)**

Ger te divêtin ku beraber nebitin kes bi te ra
'ilmî bixûn hem 'emelî tû bike sin'et ji xwe ra

(Mufte'ilun mufte'ilun mufte'ilun mufte'ilun)
Ev receza meṯwî ye da qenc bizanî tu bira

(Fulk) e gemî, (selk) e lirêçûn, û (ḏiya) ruhnî bizan
(Şehr) e meh, û (leyl)-i şev e, (sifle) geda, (ebleh) nezan

('işq) û (meḧebbet) çi? Evîn, (buxḏ) û ('edawet) çi? nevîn
(Inhezemû) cumle revîn, (ixtelesû) ye'nî: Revan

(Cewşen) u (dir') herdu (zirih), (cunnet) û (tirs) herdu meṯal
(Šarim) û (seyf) herdu ne şîr, (sehm) û (qisî) tîr û kevan

Tefşû (qedûm), (dulb) e çinar, (miḧfer) û (sekne) çi? Mikar
(Milzem) û (xerk) herdu mişar, (qeṯ') e birîn, (sinn) e didan

(Ibl) û (be'îr), ('îs) û (cemel), (naqe), (cemaz) ew deve ne
(Ḧicr) e mehîn hem ('eqil) e, (muhr) e kurî, hesp e (ḧišan)

('icl) û (ḧemel) golik û berx, (cedî)-y û ('enaq) herdu ne kar
(Semn) û (semîn) rûn û qelew, (şeḧm) bez e (ḏir') e guhan

(Meršed) û (minhac) û (teriq) rê ne, (meršûš) e qewî

('alî)-y û (samî) çi? Bilind, (malik) û (šahib) çi? Xudan

**(Serî' me<u>t</u>wî)**

Herçî kesê 'ilmekê qenc xwendiye
Dewlet e ger wî bi ešl zanîye

(Mufte'ilun mufte'ilun fa'ilun)
Behra serî' e we çi xweş me<u>t</u>wî ye

(Mekke, Medîne) çi ne ew? (Qeryetan)
Roj û heyîv herdu çi ne? (Zebreqan)

(Şehd) û ('esel) herdu çi ne? Hingivîn
(Erî)-y û (sinût) û (<u>d</u>ereb) ew jî wisan

('e<u>d</u>b) û ('ešeb) herdu çi ne? Şîr û reh
Şîr û qelem herdu çi ne? (Eq<u>t</u>e'an)

(Şariq) û (bey<u>d</u>a) çi ne? Ew herdu roj
Meẍrib û meşriq çi ne? Ew (xafiqan)

(Şems) û (qemer) roj û heyîv in bira
Roj û heyîv herdu çi ne? (Ezheran)

(Eyser) û (yusr)-i çi ne? Ew herdu çep
Rast-i çi ye? (Eymen) û (yumna) bizan

(Ḧelf) û (yemîn) û (qesem) in cumle sûnd
Êminî-y û ’edl-i çi ne? (Efd̲elan)

(Ḋi˚b) û (ẍurab) herdu çi ne? Gurg û qir
Gurg û qijik herdu çi ne? (Ešreman)

(Qesweret) û (d̲eyẍem) û (dilhaẗ) e şêr
(Ḧariẗ) û (leyẗ) û (esed) ew jî wisan

(Ebt̲eḧ) û (bet̲ḧa) ne newalêd biber
(Sariq) u (liš) herdu ne navêd dizan

(Hirret) û (sinnewr) e pisîk, (fe˚r) e mişk
(T̈uqbe) kun e, rûvî çi ye? (T̈u’luban)

(Waḧid) û (iẗnan) çi ne? Ew êk û du
Sê ne (ẗelaẗ), (erbe’e) çar in ’eyan

(Xemset) u (sittet) çi ne? Ew pênc û şeş
Ḧeft in u ḧeşt in ev e (seb’e) û (ẗeman)

(Tis’) u (’eşir) herdu neh û deh temam
Sed (mî˚e) û (elf) e hezar ey ciwan

**(Hezec salim muẗemmen)**

Di fešla newbiharê da di gel dilber biçî geştê
Ji ew xweştir 'umir nabit li min ew ḧal qewî xweş tê

(Mefa'îlun mefa'îlun mefa'îlun mefa'îlun)
Hezec salim muẗemmen bit li ṯeb'an xweş muneqqeş tê

('eḏud) bask û enîşk (mirfeq), (zira') zend û (lisan) ezman
Tenişt (cenb) û (ibiṯ) binçeng, ('unuq) esto (ẗedî) pistan

(Cewariḧ) dest û pê, (ḧulqûm) û (ḧelq) û (ḧuncure) gewrî
('eşa°) şîv, û (ẍeda°) têşt, û (xiza°) zad, û (ina°) aman

(Wešeb) êş, û (nešeb) zeḧmet, (xeten) zava, (xitan) sunnet
(Biṯane) dostî, û (mebṯûn) e zikêşî, û (dewa°) derman

Bizan çar in ('enasir): Ax û av û ba û agir hem
(Mewalîd) in ev in hersê: (Nebat) û (me'den) û (ḧeywan)

(Ṯebai') germî û sarî, zuwayî-y û terî herçar
We reng šefra û sewda, belẍem û xûn, bêje (exalṯ)an

(Ẍelel) av, û (me'în) carî, (duca, ẕulmet) şeva tarî
(Weḧel, ṯîn) û (ḧeme°, šelšal) herî, (wedq) û (ḧeya) baran

(Cidar) û (ḧaiṯ) û (ebniyye) dîwar in, (’emûd) istûn
(Xeşeb) dar û (weted) sing û kemer (ṯaq) û (riwaq) eywan

(Cerîde) defter û (qirṯaš) e kaẍed, (ṯirs, wereq) ew reng
(Suradiq) xîvet in, (fisṯaṯ) e kûn, (ẕerf) û (wi’a˚) aman

Işaret (weḧî)-y û (telwîḧ), û (iradet) vîn û (qudret) şîn
(Ceban) qels, û (beṯel) merd, û (liwa˚) ala, (’elem) nîşan

(Qešî) dûr û (duḧûr) ew reng, (qešeb) qamûş, û (qird) meymûn
(Feres) hesp û (ceres) zengil, (ikaf) û (berḋe’e) kurtan

(Ḧemîm) xizm, û (ḧimayet) pan, (turaẗ) û (îrẗ) e mîraẗ in
(Ebû) bab e, (ubuwwet) babî-y, û (bewwab) e dergahvan

(Ebû cami’) çi ye? Sufre, (ebûl-naci’) çi ye? Ḧelwa
(Ebûn-nafi’) çi ye? Sirke, (ebû cabir) dibêjin nan

**(Muteqarib meqšûr)**

Mu’ellim bila dil wekî ber bitin
Divêtin ku şagirdê dilber bitin

(Fe’ûlun fe’ûlun fe’ûlun fe’ûl)
Teqarub xweş e ger muqeššer bitin

(Sema˚) asiman, (’erş) e ban, xanî (beyt)
(Teteq) perde, (irfe’) hilîn, xwezî (leyt)

(Du’a˚) xwestin û (de’) bihêl, (ruḧ) here
(Mereq) şorbe ye, (kul) bixwe, (ci˚) were

(Mele˚) meclis, û tijîbûn (imtila˚)
(Sena˚) ruhnî ye, her wekî (incila˚)

(Ceḧîm) û (cehennem), (leẕa) û (seqer)
Hemî dojeh û cih (meqam) û (meqer)

(’ibadet) perestin, (’ibaret) beyan
Heyîn aşikara (’ilan) û (’eyan)

Bi me’na ’eđab in (’iqab) û (nikal)
(Xebel, xebṯe) dînî, xerabî (xebal)

(Şeḧîḧ) û (helû’) û (ḏenîn) û (bexîl)
Bi me’na yek in cumle, (saẍir, đelîl)

Qewî rûtirş rû(kelûḧ) û (’ebûs)
Ji bo bûk û zava dibêjin (’erûs)

(Muweşşeḧ), (muzeyyen), (mukellel) wisan
(Muşkkel) bizane (ḧisan) û (bisan)

Sipahî ye (buhlûl) û zînet (beha°)
(Seciyyet) ṯebî’et, (teḧiyyet) du’a°

Hesanî ye (rewḧ) û hewar e (niyaḧ)
Xilasbûn e (fewz) û (felaḧ) û (necaḧ)

Zivistan (şita) ye, û havîn e (šeyf)
Behar e (rebî’), û peyîz e (xerîf)

(Senet) sal, û (usbu’) e ḧeftî binas
(Serawîl) û (sirbal) e derpê û kiras

(Nu’as) û (sinet) honijîn, (hec’e) xew
(Firî), (iftira°), (idde) hersê derew

(Teraxî, teref) sistî û nermî ye
(Ḧešeb) suxtin, û (me’me’an) germî ye

Sivikbûn e (xiffet), giranî (weqar)
(Terebbuš) derengî, û deng e (xuwar)

Firîvî (ḧenîd), û firûzî (muka')
(Šiyaḧ) û (šeda) deng, û gazî (nida')

Recez (istiran) e, wisan e (hezec)
(Herec) têkilîbûn e, (mezc) û (merec)

(Benan) sertepilk û (ešabi') tilî
Beraber ('edîl), û (şikayet) gilî

Derîzan e ('etbe) û renge (wešîd)
Bi me'nayê ax in (rufat) û (še'îd)

(Qewarîr) e şûşe, (mumerred) hilû
(Duxan, dux) û (yeḧmûm) çi ne? Navê dû

(Tecelcul) hejîn e, (tebettul) birîn
(Tekellum) xeberdan, (tebessum) kenîn

(Tebadur, 'ecel, sur'e) hersê lez in
(Ḧedîqet) û (bustan) û (cennet) rez in

(Kitabet) nivîsîn, murekkeb (midad)
(Tilawet) çi? Xwendin, meḧebbet (widad)

Gihîştin bizane (wusûl) û (wurûd)
Hem evrazîçûn e (’urûc) û (šu’ûd)

(’erec) lengî ye, û (’iwec) xwehrî ye
(I’anet) û (nušret) çi ne? Arî ye

(Riba) zêdehî, (rebwe) erdê bilind
(Ḏiyafet, qira) her wekî (qerye) gund

(Cuded, rey’-i, qešd) û (širaṯ) û (sebîl)
Hemî rê ne, (muhdî) û (hadî) delîl

(Remel) zûlirêçûn e hem (herwele)
(Neḧafet) zebûnbûn e, hem (ḧewqele)

(Şeca’et, celadet) ciwanmêrî ye
(Seẍeb) û (ẍereẗ) birs, û (şeb’) têrî ye

(Cima’) û (refeẗ, weṯ°) e gan, (bed̈l) e dan
(Ḋeker) kîr û quz (ferc) e, gun (xišyetan)

(Tedeffuq) verihtin, (teled̈d̈ud̈) xweşî
Wekî (seqye) avdan, (neḏaret) geşî

(Ebul-kibr) e zîv, û (Ebul-feḏl) e zêr
(Ebul-necm) e rovî, (Ebul-ḧerẗ) e şêr

(Ebul-emn) e têrî, (Ebû'emru) birs
(Ebul-qeys) e tûrî, (ḧeder, xewf) e tirs

(Ebû ce'fer) e mêş, (Ebû ce'd) e gurg
Quling e (kurî) û (ḧubara) ye çirg

(Ebul-lehwî) tenbûr, (Ebul-ẍefle) fîl
(Ebû murre) şeyṯan û (sulṯan) delîl

(Fema xeṯbukum eyyuhel murselûn)
Gelî qašidan bo çi hatîne hûn?

(Te'alew serî'en) werin hûn bi lez
(Fehaḋihî cenne) evê ha ye rez

(Lineḋheb û nel'eb û ne˚kul me'en)
Biçîn da bileyizn û vêkra bixwen

Di gel min (me'î) û di gel te (me'ek)
(Welî) hem ji bo min, ji bo te (welek)

('eleyke) li ser te, ('eleyye) li min
('eleyhî) li ser wî, û (minnî) ji min

('eleyna) li ser me, ('eleyhim) li wan
('eleykum) li ser we, (xesaret) ziyan

(Neharen) bi roj, û (beyaten) bi şev
(Minel cehlî firre) ji cehlê birev

(Fe in kunte tercû ṯerîqen-necat)
(Fexud mesleken muẕhir-elmu'cizat)

(Lima ûḧî lil-Mustefa festemi')
(Bi sem'îr-riḏa fe'teqid wettebi')

(Ušellî 'ela şafi'î Eḧmeda)
(Fela tense ya şafi'î Eḧmeda)

Ev renge dibêjit Xanî: Eger tu bi id̈'anî, bifikire kitêba ẗanî[1], di cilê ewwil da[2], di cuz˚a 'aşir da[3], di werqa çarê da[4], ji šeḧîfa destê rastinî[5], di se̱tra ẗaliẗ da[6], ji kelîma ẗanî[7], bigire tu ḧerfa çarê[8], ew e tarîx e ji Nûbiharê.

1 Hezareya koçî ya duyem.
2 Sedeya yekem.
3 Deheka dehem.
4 Sala çarem.
5 Nîvê yekem.
6 Meha sêyem.
7 Deheka duyem.
8 Roja çarem, an ku 14.03.1094ê koçî.

Semameyê name namê (Ellah)
Bê namê wî natemam e (Wellah)

Ey met̲le’ê ḧusnê ’işqibazî
Meḧbûbê ḧeqîqî û mecazî

Namê te ye lewḧê nameya ’işq
Ismê te ye neqşê xameya ’işq

Bê neqşê te neqşê xame xam e
Bê namê te name natemam e

Namê te ye şahibeytê meqšûd
Fihristê mukatebatê meḧmûd

Med̲mûnê muraselatê la-reyb
Meşhûdê mukaşefatê bil-ẍeyb

Meḧbûbê qulûbê (menlehul-qelb)
Qelban tu dikey bi ba xwe ve celb

Me’şûq-i tu yî, bi fexr û nazî
’aşiq tu yî, lêk-i bê niyaz î

Mut̲leq tu mufîd û mustefad î
Bê şubhe murîd û hem murad î

Nûr î tu di ĥusnê rûyê dildar
Nar î tu di qelbê ’aşiqê zar

Şem’ î ne ji qismê nûr û nar î
Şems î ji ’eyan tu perdedar î

Genc î tu di nêv ṯilismê ’alem
Kenz î tu ’eyan ji ismê Adem

Ev ’alem û ademî di meşhûd
Ev mumkin û masiwayê mewcûd

Hemyan bi te ye midare û debr
Feyyaḏê riyaḏê xelq û (wel-emr)

Emrê te bi lefẕê (kun) du ’alem
Mewcûd-i kirin ẍereḏ çi Adem

Adem bi xwe yek ji her duwan e
Yek ĥerf-i ji emrê (kun-fekan) e

Ew ĥerf e ĥeqîqeta muĥeqqeq
Hem emr e bi qudreta te hem xelq

Eşbaĥ-i muressem in ji nasût
Erwaĥ-i muwessem in bi lahût

Ev rûḧ û cesed bi cebr û ikrah
Tezwîc-i bûyîn bi emrê Ellah

Nasûtî eger çi reng sufal e
Lahûtî ji pertewa cemal e

Ḧerfa ku me gotî neqşê hûr e
Lê meqšed û me'neya wê kûr e

Ẕahir te eger numaye šuẍra
Baṯin ew e neqşê xame kubra

Mewcûd e di wê şehadet û ẍeyb
Meşhûd e di wê siyadet û 'eyb

Insan bi xwe hem ẕelam e hem nûr
Adem ji te hem qerîb e hem dûr

Hindî weku cinsê 'alemî ne
Ew tabi'ê new'ê ademî ne

Ev renge felek hemî mu'eẕẕem
Ev çende melek hemî mukerrem

Ev karigeha 'eẕîm e dewwar
Ev barigeha bedî' e seyyar

Ev çende zemîn di gel ’enasir
Ev renge ’ereḏ di gel cewahir

Ev çendehe ni’met û nefais
Ev rengehe meˀkel û melabis

Ev çendehe mudde’a û meṯlûb
Ev rengehe muşteha û meḧbûb

Ḧeywan û me’adin û nebatat
Meṯlûb û meqaŝid û muradat

(Bil-cumle) ji bo me ra li kar in
(Fil-cumle) ji bo me pur dibarin

Ḧeqqa ku tu xweş niẕam û rewneq
Tertîb kirine ji bo me El-Ḧeq

Em ẍafil û ’aṯil û gunehkar
Mayîne di qeydê nefsê emmar

Nînin me di qelbî fikr û đikrek
Nakeyn bi zebanî ḧemd û şukrek

Xanî ku nehin bi qelbê đakir
Barî bide wî zebanê şakir

## Ti’dad ne’met şimarî û tikrar şikirguzarîya Barî û šûretê ayînedarî û perdebirdarîya perwerdigarî da di gel ixtitama bi munacatek muxtešer kurdewarî

Ey şukrê te cewherê zebanî
Wey đikrê te šeyqela cenanî

Ey Waḧidê bê şerîkê yekta
Wey Wacidê bê nez̠îr û hemta

Ey Baqîyê bê zewalê daim
Wey Hadîyê bê fenayê qaim

Ey xaliqê erḏ û asimanan
Wey xaliqê cumle ins û canan

Mulk û melek û felek bi carek
(Bil-cumle) te çêkirin, tebarek

(Subḧaneke kullema xeleqte)
(Eḧsente fekeyfe ma xeleqte)

Herçî ku te çêkir, ey nikûkar
Her yek di ḧedê xwe da sizawar

Ev neh šedefêd-i pur mirarî
Durr û şeveyêd şefaf û t̠arî

Ḧeftê di miẗalê durrê ẍelt̲an
Her şeş cihet û çihar-i erkan

Her sê weledêd-i pur mewalîd
Ẍebra û sema di gel meqalîd

Lewḧ û qelem û ẗewabit û ’erş
Ḧeywan û nebat û me’den û ferş

Z̲ahir kirin ev qeder šenayi’
Peyda kirin ev qeder bedayi’

Her yek ji ’edem kirin te peyda
Ibda’-i kirin te bê heyûla

(Fil-cumle) çi ewwel û çi axir
(Elqišše) çi mu°min û çi kafir

Her yek ji te ra we bûne mez̲her
Ew reng-i di wan tu bûyî mud̲mer

Bê ḧusnê te nîne wan wicûdek
Bê nûrê te nîne wan numûdek

Ḧikmet ew e bat̲inî û z̲ahir
Qudret ew e ẍa°ibî û ḧad̲ir

Nînin te teȟeyyuz û temekkun
Emma we di wan dikey tewet͟tun

Goya hemî cismek in tu can î
Goya hemî şehrek in tu Xanî

Ȟusna te ye zîneta ȟebîban
Reşka te ye ẍîreta reqîban

Meyla te ye 'aşiqan dikêşit
Derdê te ye dil ji ber diêşit

Şîrîn te kirin şeker li Perwîz
Ferhad-i ji rişkê eşke xûnrîz

Leyla te kire bela li Qeysî
Ramîn-i bi te ram bû li Weysî

Yûsif te çira numa Zuleyxa
Wamiq te kusa gihande 'Edra

Şêxê weku pênce hec bijarî
Dîn kir te ji bo keça kufarî

Neylofer e naziperwerî kir
Ew jî te li mihrê muşterî kir

Balayê bilind te daye serwan
Pabendê bela te da teđerwan

Sorgul te kirin ji xarê peyda
Bulbul te kirin hezar-i şeyda

Xweşrengî te da giyayê sorgul
Xweşdengî te da newayê bulbul

Ronahî te da serê şemalan
Perwaz-i kirin bi şewqê talan

Meḧbûb-i te çêkirin di dilgeş
Mecđûb-i te pê kirin muşewweş

Ev 'işq û meḧebbeta di dil da
Ev zulf û selasilêd bi mil da

Aya ne te çêkirin muqabil?
Her yek te bi hev kirin mu'adil

Ayîne te çêkirin mukerrer
Ḧusna xwe di wan te kir mušewwer

Ayîne li pêşî ṯûṯîyan girt
Davek te li pêşî kûvîyan girt

Ayîne ji wan weye ku av e
Ew ’eks e ji wan weye ku t̲av e

Neqşê te dibînin ew di avê
Nakin ḧeďerê ji av û davê

Lebteşne t̲eleb dikin zulalê
Wê dane û dam-i zulf û xalê

Meqšûd-i ku bû ji pêş ve ḧad̲ir
Dê qešdê biken cemî’ê naz̲ir

T̲ût̲î bi xwe ma şeker dirêjin
Herçî dibihin ewî dibêjin

Wê meqšedê muxtešer dibînin
Pabend-i dibin gelek dimînin

Meqšûd û muradê dil tu şay î
Emma tu (tud̲illu men teşa) yî

Herçî te divê bibey d̲elalî
Pabend-i dikey bi zulf û xalê

Herçî ku tu bînî ser hidayet
Vêra bikirî bikey ’inayet

Ḧad̲ir wî dibey meqamê me'lûm
Ger xadim e wî digêrî mexdûm

Bê secde te ey cenabê me'bûd
Adem kire qîblegah û mescûd

'Îsa te kusa gihande ewcan
Aya bi çi te ḧebande ew can

Dersa ku bi xef te gote Idrîs
Elbette diçû meqamê teqdîs

Iblîsê Feqîrê bêcinayet
Hindî te hebû di gel 'inayet

Her roj-i dikir hezar-i t̲a'et
Lewra ku te da wî istit̲a'et

Wî secde nekir bi ẍeyrî me'bûd
Gêra te ji ber derê xwe merdûd

Yek secde nebir li pêşî eẍyar
Qehra te kire (muxelledun-nar)

(Elqiš̌e) ji ḧikmeta te agah
Ferdek mi nedî (tebarek-Ellah)

’irfaniṯelebêd šaḧib-i idrak
Der ḧeqqê te gotî (ma ’erefnak)

Xanî bi nezanîya xwe der ḧeq
Gumrah-i bibit ne dûr e Elḧeq

Illa ku meger mu’în Xuda bit
Ya rahiberê dî Muštefa bit

Ya Rebbî bi ḧeqqê Mušṯefa key
Xanî bi xwe ra tu aşina key

**Di ne’ta qelemê mešnû’at û serdefterê mewcûdat û ’eqlê me’qûla̤t û pêşdestê mexlûqat ḧeḏretê seyyidul-sadat Muḧemmed Elmuštefa ’eleyhî efḏeluš-šelewat**

Eşya bi ḧeseb delîl û burhan
Nabin çu meger wicûb û imkan

Wacib yek e ḋatê kibriya ye
Mumkin pur e cem’ê masiwa ye

Wî wacibê mumkinatê berqe’
Mumkin wî ji bo xwe kirne meṯle’

Ye’nî ewî vê bibit muberhen
Ḧusna wî biderkevit ji mekmen

Gencîneyê sirrê wî bibit faş
T̈abit bibitin ji neqşê neqqaş

Lê šin’etê wî Ḧekîmê Dana
Neqşê ewî Qadirê Tiwana

Nedbû ku nebit ewî rusûmek
Laiq ewî dê hebit ruqûmek

Herçî weku bûne bêreqem bû
Lew ewwelê (ma xeleq) qelem bû

Ev ewwel û rûḧ û 'eqlê ewwel
Her sê ne bi ewwelî mu˚ewwel

Emma meke wan ji hev tu tefrîq
Ev renge ewan bigêre tewfîq

Bê şey˚ekî waḧid in bi carek
Te'dad û te'eddud i'tibarek

Ewwel beriqî ji ḧusnê sermed
Nûrek bûye me'niya Muḧemmed

Ew nûr-i bi emrê ('alimul-ẍeyb)
Bû menşe˚ê feyḏê 'alema-ẍeyb

Erwaḧ-i ji me'neya peyember
Çêbûn meẗelê nebat û şekker

Bû ešlê ušûlê cumle nefsan
Nefsa su'eda û nefsê neḧsan

Hemyan ji wî dîtine teferru'
Hemyan bi wî girtine temettu'

Hêja, ne zemîn û ne sema bû
Ew serwerê cumle enbîya bû

Xelqa felekan ji bo wî ra bû
Secda melekan ji bo wî ra bû

Ew reḧmetê cumle ’alemîn bû
Adem di miyanê ma˚ û ṯîn bû

Pêẍemberê cem’ê cuz˚ û kul bû
Adem bi xwe hêj-i av û gil bû

Ew pencereya cemalê Barî
Şemsa feleka dilê di tarî

Gava kete šûretê cehanî
Pêẍemberê axirê zemanî

Wî berzexê mumkinatê wacib
Wî padişehê li şeklê ḧacib

Mensûx-i kirin wî dîn û millet
Me’lûl kirin wî ’elîl û ’illet

Fekrî ku cehan cemî’-i kufr e
Kêşa ji nubûweta xwe sufre

Xelqê ku hebûn li rûyê ’erdî
Teklîf kirine hemî bi merdî

Xaqan bi xwe hindiwê kemîn bû
Feẍfûr ji xuwanê kaseçîn bû

Qeyšer bi qušûrîya xwe qašir
Ḧadir gerîya di ’eynê bašir

Şahê ’erebî ’elem ku rakir
Kesrayê ’ecem ’eceb duta kir

Rom û ḧebeş û fireng û tatar
Herçî ku nekir bi dînî iqrar

Naçar-i gelek bi şîr fena bûn
Ḧetta ku hinek bi dîn teba bûn

Butxane bi agirî dişuştin
Ateşkede cumlekî vekuştin

Gava ku wî dîn kir aşikara
Dawûdî û sibṯî û nešara

Tewrat-i ewan ji bîr kir ekẗer
Incîl û Zebûr-i çûn ji ezber

’Îsayî dema dixwende Incîl
Beḧsa wî dikir bi weḧy û tenzîl

Go: Mujde didim Resûlê emced
Dê paşî mi bêt bi navê Eḧmed

De’wa xwe diket bi dest û ezman
Destê wî bi seyf û dev bi Qur'an

Xweş xilqet e hem resûl e hem mîr
Pur ḧikmet e hem kitab e hem şîr

Naxwende sebeq muderrisê ’am
Bê mal û menal û šaḧib in’am

Bê xeyl û ḧeşem bi xwe cehangîr
Bê ṯebl û ’elem cehan šedagîr

Herçî te didî meger her ew bû
Leşker li cunûdê (lem terew) bû

Bê xeyme û barigah û eywan
’ewran vedida li ser wî seywan

Hindî ku ji pêş ve ba xeber bû
Ew çende ji paş ve ba bešer bû

Sih danediket ji wî li ’erdan
Vêkra dibihîst-i sed xeberdan

Goyende dibûn di gel cemadat
Poyende dibûn di gel nebatat

Yek new'e nema ji cinsê ȟeywan
Neyna bi nubûweta wî îman

Illa ku hinek ji ibnê Adem
Bûn derxurê ateşê Cehennem

Elqišše di 'erḏ û asimanan
Ȟašil di cemî'ê ins û canan

Nînin bi şerafeta wî tiştek
Nabit ji wî zêdetir me piştek

Ev bû mededê di umeta xwe
Mumtaz-i kirin bi himmeta xwe

Wer'a wî we renge dîn qewî kir
Şer'a wî širaṯ-i mustewî kir

'alim hemî şubhê enbîyan e
'abid hemî pêkve ewlîyan e

Ferdek ji šehabeyê di kubbar
Pansed ji dilawerê di kuffar

Ew cumle di gel yekî seraser
Nedbûn bi mehabetê beraber

Xelqê heye şubheyek di dînî
Beḧïê bi cedel biket ji dînî

Qur°an û xeber çi mu'cizat in
Ayat û suwer çi beyyinat in

Bûbekr û 'Umer çi xweş qerîn in
'Usman û 'Elî 'ecebguzîn in

Ey padişehê bilind e paye
Xurşîdê feleknişîn di saye

Ne'tê te bi 'ilmê min meḧal e
Meddaḧ-i ji bo te (Ḋul-celal) e

Ez dê çi bibêjim ey şehnişah
Weṡṡafê te ye kelamê Ellah

Şaha ji te ra xweş ism e (Yasîn)
Taha ji te ra ṯilism e (ṯasîn)

Her ev bese ey ḧebîbê muxtar
Barî ji te ra bi jî te sûnd xwar

Sed car-i bi jî te ey keremkar
Ger dê me hebin guneh du sed bar

Sed mertebe gerçi em xerab in
Emma ji te naumêd-i nabin

Ḧetta bigehî te Xanîyê jar
Napak û belîd û (wacibun-nar)

Ew jî bi xerabî û šeyînî
De’wê diketin bi ummetînî

Wî bed’emelê wekî kilaban
Barî bike peyrewê šehaban

**Istid'ayê şefa'et û istişfa'ê meẍfiret ji cenabê šaḧibê serîrê şefa'et di šûretê mi'racê da, bi bal ḧedretê 'izzet 'ezume şe°nuhû**

Ey wašiṯeyê wucûdê kewneyn
Şayisteyê qurbê (qabe qewseyn)

Şahinşehê textegeh Medîne
Mu'ciz ji te ew qeder me dîne

Seyra felekan li nik te gavek
Fexra melekan ji te silavek

(Şeqqul-qemer)a te yek işaret
(Zaẍel-bešer)a te yek 'ibaret

Ey padişehê serîrê (lewlak)
Rabe here asimanî çalak

Ḧadir ji te ra Buraq û refref
Şaṯir bi te ra firişte šef šef

Da refi'-i bibin ji ber te perde
Bê perde di gel Xudê xeber de

Bêjê: Tu qedîr û (Ḋul-celal) î
Bêjê: Tu qedîm û (la-yezal) î

Em fanîyê jar û muştexak în
Hadî tu nebî xo em helak în

Ewwel te ji bo çi da me te'ẕîm
Danî li serê me tacê tekrîm

Teşrîfê xilafetê te da me
Gava te emanetê xwe da me

Me'lûmî te bû ku em nezan în
Qedrê wî emanetî nizanîn

Herçî te ji bo me kir irade
Yek ďerre me lê nekir ziyade

Ȟaşa ji kemalê re°feta te
Dûr e ji cemalê reȟmeta te

Kufr û gunehan bikey behane
Layqê te bitin ev e şehan e

Yekrû ne li nik te kufr û îman
Yeksû ne li nik te xuld û nîran

Qehra xwe bikey eger tu ẕahir
Cennet li me dê bibîte agir

Wer feydê biket seȟabê reȟmet
Dozex li me dê bibîte cennet

Ger kafir û ger gunahikar în
(Bil-cumle) ji te umêdewar în

Kes nîne ji kafir û 'ušatan
Mezher nebitin ji bo šifatan

Kafir bûyîn em bi ismê Qehhar
Ẍeffar e ku em kirin gunehkar

Kufrê tu meger neşêy bibexşî
Ger dê gunehan li me nebexşî

Dê şad-i bibin li me şeyatîn
Mesrûr-i bibin gelek mela'în

Qet ẍîret e ey penahê 'alem
Qet laiq e ey şebanê Adem

Ev gurgê le'în û bedserencam
Jêkra biketin me şubhî eẍnam

Elqišše yekê ku dêw û serkeş
Tenha û bi tenê biçîte ateş

(Fil-cumle) me cumle xaš û 'aman
'ašî û şeqî û natemaman

Têkra bi şefa'eta xwe xaš ke
Vêkra me ji agirî xelaš ke

**Eş’ara medîḧeta ẗewaifêd kurdan e, bi şeca’et û ẍîretê i̱zhara bedbextî û bêṯali’îya wan e, di gel hind e semaḧet û ḧemiyyetê**

Saqî tu ji bo Xudê kerem ke
Yek cur’eyê mey di camê cem ke

Da cam-i bi mey cihan numa bit
Herçî di irade ye xuya bit

Da keşf-i bibit li ber me eḧwal
Kanê dibitin muyesser iqbal

Idbarê me wê giha kemalê
Aya bûye qabilî zewalê

Ya her wehe dê li istiwa bit
Ḧetta weku dewrê munteha bit

Qeṯ mumkin e ev ji çerxê lewleb
Ṯali’ bibitin ji bo me kewkeb

Bextê me ji bo me ra bibit yar
Carek bibitin ji xwabê hişyar

Rabit ji me jî cehan penahek
Peyda bibitin me padişahek

Şîrê hunera me bête danîn
Qedrê qelema me bête zanîn

Derdê me bibînitin 'ilacê
'ilmê me bibînitin rewacê

Ger dê hebûya me serfirazek
Šaḧib keremek suxennewazek

Neqdê me dibûye sikke meskûk
Nedma wehe bê rewac û meşkûk

Herçende ku xališ û temîz in
Neqdeyn-i bi sikkeyê 'ezîz in

Ger dê hebûwa me padişahek
Laiq bidiya xudî kulahek

Te'yîn bibûya ji bo wî textek
Ẕahir vedibû ji bo me bextek

Hašil bibûya ji bo wî tacek
Elbette dibû me jî rewacek

Ẍemxwarî dikir li me yetîman
Tînane derê ji dest leîman

Ẍalib nedibû li ser me ew rom
Nedbûne xerabeyê di dest bom

(Meḧkûmun'eleyhî) û še'alîk
Meẍlûb û muṯî'ê tirk û tacîk

Emma ji ezel Xudê wisa kir
Ev rom û 'ecem li ser me rakir

Teb'iyyetê wan eger çi 'ar e
Ew 'ar e li xelqê namidar e

Namûs e li ḧakim û emîran
Tawan çi ye şa'ir û feqîran

Herçî bire şîrê destê himmet
Ḏebṯ kir ji bo xwe bi mîrî dewlet

Lewra ku cehan wekî 'erûs e
Wî ḧukm-i di destê şîrê rûs e

Lê 'eqd û šidaq û mehr û kabîn
Luṯf û kerem in 'eṯa û bexşîn

Pirsî ji dinê min ev bi ḧikmet
Mehra te çi? Gote min ku himmet

Ḧašil ku dinê bi şîr û iḧsan
Tesxîr-i dibit ji bo wî insan

Ez mame di ḧikmeta Xudê da
Kirmanc-i di dewleta dinê da

Aya bi çi wechî mane meḧrûm
(Bil-cumle) ji bo çi bûne meḧkûm

Wan girte bi şîrî şehrê şuhret
Tesxîr-i kirin biladê himmet

Her mîrekê wan bi bedlê Ḧatem
Her mêrekê wan bi rezmê Rustem

Bifkir ji 'ereb ḧeta ve gurcan
Kirmancî ye bûyî şubhî burcan

Ev rom û 'ecem bi wan ḧešar in
Kirmanc-i hemî li çar kenar in

Herdû ṯerefan qebîlê kirmanc
Bo tîrê qeḏa kirîne amanc

Goya ku li ser ḧedan kilîd in
Her ṯaife seddek in sedîd in

Ev Qelzemê Rom û Beḧrê Tacîk
Hindî ku dikin xurûc û teḧerîk

Kirmanc-i dibin bi xûn mulet̲t̲ex
Wan jêk ve dikin miẗalê berzex

Camêrî û himmet û sexawet
Mêrînî û ẍîret û celadet

Ew xetm e ji bo qebîlê ekrad
Wan dane bi şîr û himmetê dad

Hindî ji şeca'etê ẍeyûr in
Ew çendî ji minnetê nufûr in

Ev ẍeyret û ev 'ulûwwê himmet
Bû mani'ê ḧeml û barê minnet

Lew pêkve hemîşe bêtifaq in
Daim bi temerrud û şiqaq in

Ger dê hebûya me ittifaqek
Vêkra bikira me inqiyadek

Rom û 'ereb û 'ecem temamî
Hemyan ji me ra dikir ẍulamî

Tekmîl-i dikir me dîn û dewlet
Teȟšîl-i dikir me 'ilm û ȟikmet

Temyîz-i dibûn ji hev meqalat
Mumtaz-i dibûn xudan kemalat

## Sebebê nez̲ma kitabê bi vî ezmanî di šûretê şekwaya ji dewranî û gilîya ji enbaêd zemanî ku li bal wan yeksan e hunerdanayî di gel ’eyba nadanî

Xanî ji kemalê bêkemalî
Meydanê kemalê dîte xalî

Ye’nî ne ji qabilî û xebîrî
Belkî bi te’eššub û ’eşîrî

Hašil ji ’inad eger ji bê dad
Ev bid’et e kir xilafê mu’tad

Šafî şemirand vexware durdî
Manendî durî lisanê kurdî

Înaye niz̲am û intiz̲amê
Kêşaye cefa ji boyî ’amê

Da xelq-i nebêjitin ku ekrad
Bême’rifet in bê ešl û binyad

Enwa’ê milel xudan kitêb in
Kirmanc-i tenê di bê ȟesêb in

Hem ehlê nez̲er nebên ku kirmanc
’işqê nekirin ji bo xwe amanc

Têkda ne di ṯalib in ne meṯlûb
Vêkra ne muḧibb in ew ne meḧbûb

Bê behre nebin ji ’işqibazî
Fariẍ ji ḧeqîqî û mecazî

Kirmanc-i ne pur di bêkemal in
Emma di yetîm û bêmecal in

(Bil-cumle) ne cahil û nezan in
Belkî di sefîl û bêxudan in

Ger dê hebûya me jî xudanek
’alîkeremek leṯîfedanek

’ilm û huner û kemal û iď’an
Şi’r û ẍezel û kitab û dîwan

Ev cins-i biba li ba wî me’mûl
Ev neqd-i biba li nik wî meqbûl

Min dê ’elema kelamê mewzûn
’alî bikira li banê gerdûn

Bînave ruḧî Melay Cizîrî
Pê ḧey bikira ’Elî Ḧerîrî

Keyfek we bida Feqîhê Teyran
Ḧetta bi ebed bimayî ḧeyran

Çi b`kem ku qewî kesad e bazar
Nînin ji qumaşî ra xerîdar

Xašma ku di vî 'ešir de hemyan
Meḧbûb û ḧebîb e bo me hemyan

Ye'nî ji ṯeme' dirav û dînar
Her yek ji me ra we bûne dildar

Ger 'ilmî temam bidey bi pûlek
Bifroşî tu ḧikmetê bi šûlek

Kes nakete meyterê xwe Camî
Ranagiritin kesek Niẕamî

Weqtê ku me dî zeman e ev reng
(Fil-cumle) li ser diravî bû ceng

Hez kir me bibîne kîmiyager
Gava ku me dî nebû muyesser

Nišfî ye me pîlekî 'emel kir
Tešfiyyeyê cewherî deẍel kir

Qelbê me nekir qebûlê ḧîle
Qeṯ bû ẍereḏê nebû wesîle

Dîn çû û neket bi dest me dînar
Paşî ji neçařî bûne šeffar

Sifrê xwe yê xef me eşkera kir
Qirṯasiye bû me lê du'a kir

De'wet geřîya bi šidq icabet
Bû wasiṯeyê qeḏayê ḧacet

Ev pûl-i eger çi bê beha ne
Yekrû ne û šaf û bêbehane

Bê ḧîle û xurde û temam in
Meqbûlê mu'amela 'ewam in

Kirmancî ye širf e bêguman e
Zêr nîne bibên: Sepîdiman e

Sifrê me yê sor e aşikare
Zîv nîne bibên ku kem 'iyar e

Neqdê me bibêje kem biha ye
Bê sikkeyê şahê şehrewa ye

Ger dê bibûya bi ḏerbê menqûş
Nedma wehe bê rewac û meẍşûş

Meḧbûb e bi kes ne namizad e
Lew bextisiyah û namurad e

Qirṯasiyeya me bê penahan
Bê ḏerb û qebûlê padişahan

Me'lûl e li ba gelek 'elîman
Meqbûl e li ba gelek ḧekîman

Lê ḧakimê weqtê me'rifetnak
Mesmû'-i nekir bi sem'ê idrak

Mîrê ku bi navê Mîřiza ye
Meḧḏa neẕera wî kîmiya ye

Qelbêd-i zeẍel diket bilořî
Polêd-i deẍel diket filořî

Sed bar-i hebin filûsê eḧmer
Der hal-i diket bi yek neẕer zer

E'layî diket bi qehrê edna
Ednayî diket bi luṯfê e'la

Paşan digirit wekî esîran
Aza diketin wekî feqîran

Her roj-i hezar-i bê newayan
Her leḧze bi lutfê sed gedayan

Zengîn diketin bi destê himmet
Ḧikmet ev e naketin çu minnet

Ger dê wî nezer bida me carek
Iksîrê teweccuha mubarek

Ev qewl-i hemî dikirne eş'ar
Ev pol-i hemî dibûne dînar

Emma nezera wî zêde 'am e
Lew xaš-i nezer ji dil neda me

Ew reḧmetê 'amm e bo 'ewamê
Ya Reb bide wî tu her dewamê

**Fihristê seraẍazê kitabê exbar e û eş’arê ne’tê elqab û aẗar e di šûret i’tiraf û iqrarê bi ’ecz û inkisarê di gel i’tid̈arê**

Saqî bike camê asimanî
Raḧa weku rûḧê cawidanî

Da em bikirîn dimaẍê can ter
Yek leḧze bi raḧê rûḧiperwer

Saqî tu birêje camê mîna
Ava ku diket demîrî bîna

Şadab-i bigêre qelbê meḧzûn
Medhûş-i bigêre ’eqlê mecnûn

Saqî bike kaseya mucewher
Wî şîreyê me’šera mut̲ehher

Yaqûtê mud̈ab û le’lê seyyal
Wî durrê xweşab û xemrê ḧellal

Durdaneyê xwe birêje navê
Ye’nî ’ereqa wekî gulavê

Dem dem bide destê meyperestan
Xelqê ku hinek ji dil di destan

Da camê dilan bibit murešše’
Bezma ṯerebê bibit mušenne’

Vê meclisê meyxweran mudamî
Mestane bike ji nû mudamî

Mumkin ku ji feyḏê bênihayet
Yek qeṯre bibit li min hidayet

Neş°a qedeḧa meya mureqqeq
Keyfa ’inebê rezê birewneq

Ew reng-i biket di nefsê te°ẗîr
Ḧašil bibitin di qelbê teşwîr

Ye’nî bikevîte canî şewqek
Ḧetta bigehîte qelbî ḋewqek

Te°ẗîrê nefes bibit ji bo min
Teşrîḧê qefes bibit ji bo min

Tešfiyyeyê dil bibit me hašil
Hevdeng-i bibim di gel ’enadil

Murẍê dilê murde bête perwaz
Bê perde bibit tirane perdaz

Dem şubhetî bulbulan binalit
Geh şubhî ’enadilan bikalit

Ahan ku virê biket seḧergah
Hemware di gel nesîmê hemrah

Sed ẍunçeyê dil ji ber biker bin
Sûsin bi zeban û ba xeber bin

Bişkoje bibişkivin ji xaran
Xûnrêze bibin dimê hezaran

Sorgul bigirîn bi eşkê şebnem
Bulbul bikenin li reẍmê hemdem

Saqî, bide min şerabê gulgûn
Bê deng û def û šeda û qanûn

Da şeḧne û muḧtesib nebînin
Şahî bicivin çi ẍem nemînin

Teşwîş-i biçin ji qelbê meḧzûn
Dîsan-i bibim ji nû digergûn

Mexmûr-i bibim bikirme lavan
Serxweş bibim û bikem gudavan

Bê keyf-i neşêm çi ez bibêjim
Dîwane bibim duran birêjim

Bedḧal-i bibim suran bi der dem
Bê qal-i ji bat̲inî xeber dem

Teşbîhî neyê bikem terennum
T̲ût̲îšifetê bikem tekellum

Da keşf-i bibin ji min keramat
Meşhûd-i bibin li min meqamat

Şu'be ji meqamê dil bi awaz
Gulgeştê biken geweşt û şehnaz

Bê deng-i ji ẍewrê dil bi aheng
Sed reng-i šeda bidem wekî çeng

Manendî rebabê bê kemançe
Deng bê ji defa me bê t̲ebançe

Zuhre bibihit newayê 'uşsaq
Reqqaš-i bibit li ewcê nuht̲aq

Sazê dilê kul bi zîr û bem bit
Sazindeyê 'işqê Zîn û Mem bit

Şerḧa ẍemê dil bikem fesan e
Zînê û Memê bikem behane

Neẍmê we ji perdeyê derînim
Zînê û Memê ji nû vejînim

Me'lûl-i bûyîn ḧebîb û 'aşiq
Îrohe wekî ṯebîbê ḧad̄iq

Derman bikem ez ewan dewa kem
Wan bêmededan ji nû ve rakem

Derdê di dilê Memê cigerrêş
Zîna ji derûnê dil cefakêş

Wê perdegiya 'efîfe mestûr
Wî bêgunihê ji tuhmetê dûr

Meşhûr-i bikem bi ṯerz û uslûb
Mumtaz-i bibin muḧib û meḧbûb

Ew reng-i bikem ji nû serefraz
Da bêne temaşeyê neẕerbaz

Dilber li Memê biken girînê
'aşiq bikenin bi derdê Zînê

Hemderd-i biken bi wan šefayê
Bê derd-i bikevne (ȟelwelayê)

Xelqê ku ji sîne û ji dil šaf
Pakîzesurişt û ehlê inšaf

(Bil-cumle) biken ji bo me teȟsîn
Bêjin ku bi qencî hate tedwîn

Xelqê ji (yuȟibbuhum) di gergûn
Herçî ji ezel bûyî (yuȟibbûn)

Da bên û biken ȟikayetê goş
Hindek bikerin xwe bê feramoş

Hindek bikerin bi can sema'ê
Hin pê bikerin ji dil weda'ê

Lê hîvî dikem ji muste'îdan
Ȟerfan negirin li mustefîdan

Ev name eger xirab e ger qenc
Kêşaye me wê di gel du sed renc

Nûbare ye tifle nûresîd e
Herçende nehîn qewî guzîd e

Lê min ji rezan nekir temettu’
Manendê dizan bi kes tetebbû’

Nûrustê ḧedîqeyê fuad e
Me’šûm e ’efîf e xanezad e

Newbar e eger şirîn e ger ṯal
Meṯbû’ e ji rengê ṯeb ’ê eṯfal

Min hîvî heye ji ehlê ḧalan
Teqbîḧ-i neken evan ṯifalan

Ev mêwe eger ne abidar e
Kirmancî ye ew qeder li kar e

Ev ṯifle eger ne nazenîn e
Newbar e bi min qewî şirîn e

Ev mêwe eger ne pur lezîz e
Ev ṯifl e bi min qewî ’ezîz e

Meḧbûb û libas û gûşiwar e
Mulkêd-i min in, ne muste’ar e

Elfaẕ û me’anî û ’ibarat
Inşa° û mebanî û işarat

Mewd̠û' û meqašid û ḧikayat
Mermûz û menaqib û dirayat

Uslûb û šifat û m'ne û lefz̠
Ešlen nekire me yek ji wan qerd̠

(Bil-cumle) netaicêd-i fikr in
Dûşîze û new'erûs û bikr in

Ya Reb mede destê xelqê nasaz
Vî şahidê dilrubayê t̠ennaz

Omêd-i ew e ji ehlê 'irfan
Ew dê negirin li min çu ḧerfan

Teşnî'-i neken wekî ẍeyûran
Išlaḧ-i biken li min qušûran

Ešḧabê kemalê perdepoş in
Erbabê ẍered̠ di pur xuroş in

Me°mûl-i ew e ji ehlê razan
Ew dê nekirin bi min t̠inazan

Ez pîlewer im ne gewherî me
Xudreste me ez, ne perwerî me

Kirmanc im û kohî û kenarî
Van çend xeberêd-i kurdewarî

Imḏa biken û bi ḧusnê elṯaf
Isẍa biken ew bi sem’ê inšaf

Ešḧabê ẍereḏ ku guh bidêrin
’eyban bi kerem li min veşêrin

Ava rûwê şa’irî nerêjin
Ger mumkin e yêke qenc bibêjin

Sehw û ẍeleṯan neken te’eccub
Te°wîl-i biken ji bo te’eššub

**Mebde°ê meqaleyê ne'ta ḧakimê Buhtanê xudan iqbal (Emîr Zeyne-ddîn bin emîr Ebdal) di gel weŝfa her du hemşîreyêd wî û ŝaḧibcemal Zîn û Sitî yêd-i bêmiṫal**

Neqqaşê ŝeḧîfeyê ḧikayet
Neqqadê sebîkeyê ruwayet

Kêşa bi vî ṯerḧî resm û ayîn
Lê da bi vî ṯerzî ḏerb û tezyîn

Go: Padişehek zemanê sabiq
Rabû di ḧukûmeta xwe faiq

Ecnasê millel muṯî' û munqad
Nesla wî 'ereb emîrê ekrad

Textê wî Cizîr û bextê mes'ûd
Ṯali' qewî û meqamê meḧmûd

Rom û 'ereb û 'ecem di ferman
Meşhûr-i bi navê Mîrê Buhatn

Abaê 'iẕam û cedd û walid
Mensûb û muselselêd-i Xalid

Cebbarê felek ji wî ḧeḋerkar
Meslûl-i ji sellê seyfê Cebbar

Zîbendeyê mulk û zeynê dîn bû
Navê wî emîrî (Zeynedîn) bû

Mîrî ji wî ra bi zeyn muweššef
Zînet ji wî ra bi dîn mu'erref

Aẗarê şeca'eta wî şahî
Dagirtî ji mahê ta bi mahî

Mahiyeta wî medarê dunya
Şahiyeta wî şi'arê 'uqba

Muḧtacê sexaweta wî Ḧatem
Meẍlûbê şeca'eta wî Rustem

Ḧatem ji kemalê himmeta wey
Ṯomarê sexaweta xwe kir ṯey

'eql û huner û sexa û meydan
Ḏebṯ û neseq û nizam û dîwan

Dîndarî û dewlet û diyanet
Serdarî û šewlet û šiyanet

Meşḧûn-i ji her yekî xezînek
Meknûn-i ji her yekî defînek

Bê ’usr-i ji bo wî ra muyesser
Bê xusr-i ji bo wî ra muqedder

Enwa’ê newadir û cewahir
Elwanê nefais û zewahir

Mecmû’eyê mumkinat û meqšûd
Wacib kiribûn li nik wî mewcûd

Ḧašil bi wî mudde’a û metlûb
Wašil bi wî muşteha û meḧbûb

Šeḧna ḧeremê ji nazenînan
Cennet tijî bû ji ḧûri’înan

Ḧûrî di wê cennetê gelek bûn
Ẍilman wî di ḧedretê melek bûn

Lê zadeyê dûdemanê dewlet
Newbadeyê bositanê rif’et

Şehzade du bûn li nik wî şahî
Xurşîd-i du bûn li nik wî mahî

Ye’nî ku ji wî nejadê ’alî
Hemşîre du bûn di (la-ubalî)

Yek serwê riyadê rasitî bû
Wê nav-i bi rasitî Sitî bû

Ya dî ji dil û hinavê mîr bû
Wê nav-i ji nišfê navê mîr bû

Rawî wehe gote min mu'emma:
Ew ḧûr-i bi navê Zîn musemma

Yek zêde şirîn ziyade meḧbûb
Yek rûḧê qulûb û ḧurê meqlûb

Yek esmer û ya duyê zerî bû
Yek ḧûrî û ya duyê perî bû

Ew ḧûr û perî di bê bedel bûn
Lewra ku ji nûrê (lem-yezel) bûn

Ḧusna ruxê wan çu kes nedîbû
Zîra ji cemalê sermedî bû

Leble'l û semen'udar û gulrux
Rewneqşikenê butanê Xullux

Zulfeyn-i miẗalê ṯayê sunbul
Xeddeyn-i ji rengê rûyê sorgul

Ew sorgul û sunbulêd-i azad
Bişkiftî li qeddê serwê şimşad

Sorgul ji xwe ra li ser herustî
Sunbul bi xwe pêkve daheristî

Ḧusna xeṯê rux ji xeṯṯê yaqût
Çaha ḋeqenê ji siḧrê Harût

Goya kiribû ji mişkibîzî
Remmalê felek nuqaṯê rîzî

Xal û nuqeṯ û beyaḏ û ḧumre
Beyt û ḧecer û ṯewaf û ’umre

Ebrû ji kemanê qewsê eflak
Mujgan bi miẗalê sehmê semmak

Sermayî ye weḧşeta cunûnan
Mermûz-i di dehşeta ’uyûnan

Mebhût-i dibûn di (ṯerfetul-’eyn)
Keşşafê rumûzê (ḧikmetul-’eyn)

Cebhet di numa ji ṯerfê iklîl
Goya li ufuq cenaḧê Cibrîl

Weš̱taye li istiwayê dayim
Xurşîd-i di xidmeta wê qayim

Herçî bidiya rux û binagoş
(Fil-ḧal)î bi der dida ji bo hoş

Gerden te digo di destê saqî
Qarûre ye pur şerabê baqî

Yan şubhetî şîşeya nebatê
Yan menbe'ê kahniya ḧeyatê

Serpence û naxunî muḧenna
Rencendeyê xa̱tirê muhenna

Xelqê ku didîtin ew kemergah
Ḧa̱dir dikirin ji ẍewrê dil ah!

Ẕahir dikirin ku zend û bazin
Êdî nedima gilî û gazin

Herçende ku herdu şubhî can bûn
Ew herdu bi ḧusnê tew°eman bûn

Herçende Sitî we nazenîn bû
Lê Zîn ji miẗalê ḧûri'în bû

Herçende Sitî sitareweş bû
Lê Zîn bi ruxan heyîvegeş bû

Herçende Sitî wekî qemer bû
Zîn mihrišifet ziyadeter bû

Ew herdu wekî du şebçiraẍan
Gava dimeşîne baẍ û raẍan

Nalan dikirin cemad û ḧeywan
Talan dikirin nebat û insan

Kofî ji cewahiran mukellel
Kotirke ji netrikan muselsel

Serbend û qešeb dida cebînê
’aşiq dimirin bi derdê Zînê

Ev zînet û xeml û qişt û ḧenbel
Ez pîş û pes û yemîn û qenbel

Gava dimeşîn perî di gel wan
Walih dikirin welî di xelwan

Ger şeyxe û ger mela û mîran
Derwêş û ẍenî we ger feqîran

Kes nîne ne ṯalibê cemalê
Kes nîne ne raẍibê wišalê

Hin raẍibê ȟusnê (la-yezal in)
Hin ṯalibê qalibê beṯal in

Lêkin hemîyan yek e yeqîn dost
Ferqa ku heye ji meẍz-i ta post

**Teĥsîna qumaş û kalayê walayê ĥusna ĥebîban e 'umûma teqrîḏa cewherê bêbihayê cemala Sitî û Zînan e mexŝûŝa**

Hindî ku di qeyŝerîyêd dunya
Vêk dane xudî meta' û kala

Mecmû'ê xezainêd-i Qeyŝer
Ĥetta veke dexmeya Sikender

Durrê di defa'inêd-i Xaqan
Le'la ku di xatema Suleyman

Herçende ziyadetir beha bin
(Bil-cumle) bi cu'zê ĥusnê nabin

Ĥusna li ruxê Sitî û Zînê
Beĥra ku ji ateşê evînê

Pêla ku digirte pêl û mewcan
Roja dikete ĥeḏîḏ û ewcan

Sed can û dil û ciger disotin
Xelqî bê miŧil ji wan digotin

Şems û qemeran qiran e pêkve
Lew muşterî ev cehan e pêkve

Šeyyadê cemalê wan ẍezalan
Šeyyatê šedayê wan delalan

Dellal û šifet gelek šifetşêr
J`efẍan û ji nalîyan nebûn têr

Rojan û şevan gelek dinalîn
Ḧetta ku di gel melek dikalîn

Ḧusna nebitin çu ḧedd û ẍayet
Nabit jixwe ’aşiqa nihayet

Lê ’aşiq û (bûl-hewes) cuda ne
Hin faidexwaz û hin fida ne

Canan̲teleb in hinek ji bo can
Hin can̲teleb in ji boyî canan

Hin wešliḧebîn ji rengê Tacdîn
Hin derdiguzîn wekî Mem û Zîn

**’et̲fê ’inan û licam e bi serencamê kelam e**

Da bêne bi ser ḧikayeta pêş
Xelqê ku ji derdê ’işqê dilrêş

Herçende ku bê ḧed û qiyas bûn
’amî û xewadim û xewaš bûn

Lêkin ji xewadimêd-i mumtaz
Sed lawê sehîqed û serefraz

Her yek di meqamê ḧusnê rojek
Her yek bi kelamê sînesojek

Her yek bi kemalê bedrê mahek
Her yek bi cemalê šedrê şahek

Ew jî hemî ’aşiq in di t̲alib
Ew jî hemî t̲alib in di raẍib

Lêkin ne bi dîtin û şehadet
Belkî bi bihîstin û riwayet

(Bil-cumle ) di xidmeta emîr bûn
(Fil-cumle) ji sirrê hev xebîr bûn

Serḧelqeyê wan perîmiẗalan
Sertacê ewa melekxišalan

Tacdîn-i digotinê ciwanek
Goderzê zeman e pehlewanek

Nesl û neseb û ḧeseb 'eyan bû
Serdefter û serwerê kuran bû

Babê wî digotinê Sikender
Lêkin 'ereban digo Ẍeḏenfer

Lewra ku bi şîrî şubhî şêr bû
Roja şerî ew hezaremêr bû

Tacdîn du bira hebûn di qellaş
Manendî du şahibazê cemmaş

Daim dilê dujminan disotin
Yek 'Arif û yek Çeko digotin

Emma wî ji cumle xaš û 'aman
J`ew çendî bira û bab û maman

Lawek kiribû bira ji bo xwe
Nê ez ẍeleṯ im çira ji bo xwe

Roja ku ewî bira nedîta
Teşbîhî şeva çira nedîta

Dunya li wî têk dibûye tarî
Roj bû ku li wî dikir tewarî

Enbazê fereḧ şerîkê ẍem bû
Sergeşteyê ẍem bi navê Mem bû

Mem jî li wî ’aşiqek temam bû
Ne şubhî bira û bab û mam bû

Herçende birayê axiret bû
Te d`go ku dinî û axiret bû

Tacdîn weledê wezîrê dîwan
Mem jî xelefê debîrê dîwan

Ew herdu ciwan we lêk di ’aşiq
Ew herdu bira we pêkve šadiq

Yek Qeysê zeman e yêk e Leyla
Yek Wamiqê ’ešr û yêk e ’Eḋra

Yarê ji dilî ne serserî bûn
Reh şubhetî mihrê Muşterî bûn

Yarî û birayî û mu˚axat
Nabit bi riyayî û meqalat

Yarî, ne hêsanî ye cefa ye
Meqšûdê ji yarîyê wefa ye

Axir tu eger nekey wefayê
Ewwel mede ber xwe wê cefayê

## Dastana beyana Newroza sulṯanî tesmiyeyê mewsimê surûr û şadimanî bi mersûmê qedîmê kurdistanî ku wan digotê: Sersal ’ed dikirin bi ’îdê wišal

Xellaqê cehan ji feyḏê fiṯret
Hey°atê felek bi wechê qudret

Bê qalib û bê muḧîṯ û miqyas
Bê alet û bê meşîr û miqraš

Ev çende mu’eẕẕem û mudewwer
Ev renge mušenne’ û mukerrer

Înane bi me’reḏa wicûdê
Kêşane bi menẕera şuhûdê

Ḧikmet ew e ev hemî li kar in
Hindek di peya û hin di swar in

Hindek di beṯî° û hin serî’ in
Hindek di mu’în û hin menî’ in

Hin mudbir in ew, hinek mudebbir
Hin muqbil in ew, hinek muqeddir

Hin katib in ew, hinek di ustad
Hin muṯrib in ew, hinek di cellad

Hin rojiperest in hin şebefrûz
Hin xuššedefîn û hem xemendûz

Hindek di mitalê Zîn zerî ne
Hin şubhî Memê di muşterî ne

(Bil-cumle) mušeyqel û munîr in
Hin padişeh in hinek wezîr in

Hindek ji teḧerruka tebî'î
Ew têne bi nuqteya rebî'î

Tecdîd-i dikin ji mah û salê
Gava weku têne i'tidalê

Danayê mu'emmerê kuhensal
Ev rengehe kir ji bo me eḧwal

Go: adetê pêşîyê zemanan
Ev bû li hemî cî û mekanan

Weqtê weku şehsiwarê xawer
Teḧwîl-i dikir di mahê azer

Ye'nî ku dihate burcê sersal
Qet kes nedima di mesken û mal

(Bil-cumle) diçûne der ji malan
Ħetta digehişte pîr û kalan

Roja ku dibûye ’îdê Newrûz
Te’ẕîm-i ji bo dema dilefrûz

Šeħra û çemen dikirne mesken
Beyda û demen dikirne gulşen

Xasma ’ezeb û keçêd-i bakir
(El-qišše) cewahirêd-i nadir

Têkda di muzeyyen û mulebbes
Vêkra li teferrucê murexxeš

Lêkin ne bi tuhmet û bi minnet
Belkî bi t̠erîqê şert̠ê sunnet

Lewra ku ewan ẍered̠ ji geştê
Meqšûd-i ji çûynîya bi deştê

Ew bû ku çi t̠alib û çi met̠lûb
Ye’nî du t̠eref muħibb û meħbûb

Ev herdu celeb ku hev bibînin
Kuf‘êd-i xwe ew ji bo xwe bînin

**Bi derketina şehriyane bi deştê ji bo seyran û sersal û geştê**

Dewra felekê ji bextê feyroz
Dîsan ku numa ji nû ve Newroz

Mebnî li wî ’adetê mubarek
Şehrî û sipahîyan bi carek

Bajêr û kelat û xanî berdan
Teşbîhî bi nijdeyan û cerdan

Šef šef dimeşîne kûh û deştan
Ref ref dixişîne seyr û geştan

Ešnafê umem šiẍar û kubbar
Qeṯ’a qe nema di şehrî deyyar

Hindek bi peyayî çûne baẍan
Hindek bi siwarî çûne raẍan

Hindek bi tebayî û bi kiẗret
Hindek bi hevalî û bi weḧdet

Rabûne ve xanim û xewatîn
Wan jî tijî gul kirin besatîn

Ḧûran kire meskenê xwe cennet
Bê perde û bê melal û minnet

Doşîze û duxter û riwalan
Pakîze ’uzar û zulf û xalan

Etrab û kewa’ibêd-i ’eďra
Murdan û murahiqêd-i zîba

Ešḧabê qumaş û luṯf û ruxsar
Erbabê meta’ û ḧusn û dîdar

Wan lêk dikirin meta’-i yek’erḏ
Texmîn dikirin (biṯûli-wel-’erḏ)

Sewdagerê ’işqê bûn di bazar
Hem bayi’ê ḧusn û hem xerîdar

Sersalî û bakir û riwalan
Sedsalî û law û pîr û kalan

Sersal-i li resmê rahê me’hûd
Gêran di cih û meqamê meḧmûd

**Murexxeŝbûna wişaqan e bi gulşena sersalê reẍbetkirina wan e bi bazara ḧusn û cemalê**

Qendîlê munîrê dîrê ezreq
Mişkatê ḧemel ku kir murewweq

Sersal-i ku bû ji nû ve me'mûr
Mîr daye kurêd-i taze destûr

Destûr-i ku bû ji bo wişaqan
Rabûn hemî şubhetî 'uşaqan

Têk çûne bi me'reḏa mezadê
Dildadeyê meqŝed û muradê

Illa bi tenê Memo û Tacdîn
Wan dane xwe duxterane tezyîn

Ye'nî di dema ku bûye teḧwîl
Ew herdu bira di came tebdîl

Istebreq û sundis in di ber da
Çend mi'cer û meqreme bi ser da

Kagul kiribûne ṯûrre hersû
Perçem kiribûne zulf û gîsû

Wan lew kiribû libas-i tešrîf

Da qeṯ nebitin li wan çu teklîf

Poşîde libasê dilberanî

Seyran dikirin bi sergiranî

### Mulaqîbûna Tacdîn û Memê ye bi Sitî û Zînê musteẍriqbûna wan e di beḧra 'işq û evînê

Wan herdu kurê di came tebdîl
Weqtê dikirin di şehrî teḧwîl

Nagah û 'ecayibek nima wan
Yek cuz°ê ji 'eqlî qeṯ nema wan

Dîtin di meḧelle û zukakan
Her kûçe û ẍurfe û şibakan

Sed taze ciwan ji rengê serwan
Dîba ew ḧerîr û xez di ber wan

Pansed ji keç û kur û riwalan
Ew çend-i ji qismê pîr û kalan

Enwa'ê muḋekker û mu°ennes
Hindek di berehne hin mulebbes

Hindek di e'alî û ekabir
Hindek di edanî û ešaẍir

Pêxwas-i hinek, hinek di serkol
Kaşo ji piyan û ser wekî hol

Sermest-i hinek, hinek di serxweş
Dembest e hinek, hinek di demxweş

Goyende hinek, hinek di xamûş
Poyende hinek, hinek di medhûş

Hin came durîde hin di serxweş
Hin 'eql-i remîde hin muşewweş

Hindan dikirin fiẍan û firyad
Hin bûyî ji qeydê 'eqlî azad

Her yek di meqamekî di gergûn
Her yek bi cefayekê cigerxûn

Ew herdu demek ve man teḧeyyur
Bûn ẍerqeyê lucceyê tefekkur

Tacdîn sekinî û pirsiyar kir
Pirsa xwe bi êkê ixtiyar kir

Go: Ey Xeḏirê rehê hidayet
Bêj ev çi bela ye bê nihayet

Wî gote du şehlewendê şeddad
Îro li vî xelqî bûne cellad

Herçî ku dibînin ew du serxweş
(Fil-ħal)î diken wiha muşewweş

Wan go: Te nedî ku ew çi reng in
Wî go: Du kur in ziyade şeng in

Wan go ku bi şîr û şeşper in ew
Yan na bi xedeng û xencer in ew

Wî go ku bi ẍemze û bi awir
Xelqî dikujin wekî bi keybir

Wan pirs dikirin ku ger bibînin
Da bo xwe bi merdî dest hilînin

Herdu di wî karî bûn ku nagah
Dîtin ku ji meħḏê (qudretul-lah)

Ew herdu puser wekî du peyker
Tabende bi şeklê şahê exter

Yek hey˚et û şekl û yeklibas in
Emma di wî şehrî rengnenas in

Sîretmelek in šiwerperî ne
Ne bai' in ew ne muşterî ne

Van herdu biran ku ew du ewbaş
Dîtin dil û can we dan bi şabaş

Ew reng gerîyan cunûn û waleh
Êdî qe nebûn ji 'eqlî ageh

Ne fehm û xired ne 'eql û ne huş
Gêr bûne li ser zemîn-i medhuş

(Fil-cumle) ji 'eql û canî têr bûn
(Fil-ḧal)î ji dûr ve herdu gêr bûn

Wan herdu firişteyêd-i kubbar
Dîtin du melek ziyade dildar

Mehpare ne lêkin afitab in
Dildare ne lê cigerkebab in

Teşbîhî bi šeydê nîmibismil
Bê şubhe gihane ḧalê muşkil

Naçare bezîne ser şikaran
Fikrîne ruxêd-i wan nigaran

Zanîn ku ne šeydê serserî ne
Serxeylê sipahê dilberî ne

Westan û nez̲er kirin bi diqqet
Wan hate bi qelbî reḧm û riqqet

(Elqišše) ji ḧusnê van ẍezalan
Reḧmek kete qelbê wan rewalan

Sira dilî kir bi hev te'elluq
Nûra ruxî kir bi hev te'eşşuq

Mekşûfê t̲erîqê aşinayî
Rûḧan qe nekir ji hev cudayî

Yek rengî širf e di 'alema ẍeyb
Z̲ahir dikir ittiḧadê (la-reyb)

Ḧubbê we kirin bi hev giriftar
Ḧusnê we kirin bi hev t̲elebkar

Te d`go ku çi qalib û çi meqlûb
Her çar-i çi t̲alib û çi met̲lûb

Bê şubhe yek in çi ten çi erwaḧ
Ew mutteḧid in çi can çi eşbaḧ

Ḧubba di dilan we kir 'edawet
Buxd̲a di dilan we kir ḧelawet

Nisbet bi me ḧadiẗ in ’edîm in
Lêkin ji ḧeqîqeta qedîm in

Lewra ku cunûdê can mucenned
Çêbûne di ’ilmê ḧeq muxelled

Hin mu°telif in, hinek muxalif
Hin muxtelif in, hinek mualif

Wan mu°telifan bi yek ve ulfet
Axir we kirin, nema çu kulfet

Ye’nî ku ewan kurêd-i xûnxwar
Gava wihe dîtin ew birîndar

Ew herdu bi sed dilan ḧebandin
Rûniştin û herdu wergerandin

Gavek seyirîn li bejin û balan
Pêlek ḧeyirîn li zulf û xalan

Gotin: ’eceb ev kiçêd-i kê ne?
Yan herdu mela°ikêd Xudê ne?!

Ev mêwe li kî cihî gihane
Ev gul di çi gulşenê numane?

Serwêd-i çi cûyîbarekê ne
Ṯeyrêd-i çi murx̆ezarekê ne?

Mawerd-i ji hêstirêd-i gulgûn
Rihtin li ruxêd-i wan ê pirxûn

'işqê kiribûn wisa nehişyar
Qeṯ'a nedibûn ji xwe xeberdar

Axir ku kirin bi xameya 'eşq
Ḧusna xeṯê wan li lewḧê dilmeşq

Wan vê ku bizanin ew çi es̆l in
Lewra ku nizanin ew çi nesl in

Enguşterîyêd-i wan ciwanan
Kêşan ji es̆abi'êd xudanan

Xatem ji enamilêd xwe kêşan
Danîne cihan ji bûyî nîşan

Yaqût-i bi muhrîyan guhorîn
Elmas-i bi şûşeyêd bilorîn

Sersal û xweşî ji dest bi der dan
'eyşê xwe bedel kirin bi derdan

Nagah-i ecanibin xuya bûn
Nakam-i kirin weda’ û rabûn

Man herdu bira wekî du šeydan
Pabestê selasilan û qeydan

Rabûn ku şevek siyah û ṯarî
Şems û qemeran kirî tewarî

Reh şubhetê murẍê nîmibismil
Bê quwwet û bê tiwan û bê dil

Sersam û dewar û šer’ û mecrûr
Sewda û fuad û xebl û mexmûr

Sed car-i diketne asitanan
Ḧetta ku gihane aşiyanan

Herçende gehiştine meqaman
Emma ku li wan du telxê kaman

Roj û şev û weqtê šubḧ û êvar
Yeksan dinima li wan bi yekcar

**Hişyarîya Memê û Tacdîn e ji bêhoşî û mexmûrîya şeraba 'işqê agahî û xeberdarîya wan e ji sebeb û wasṯeyê hîvîyê**

Ew dûxiteçeşmê herdu şahîn
Ew sûxiteper Memo û Tacdîn

Xweş çûne şikarê kebk û qazan
Nagah-i bi ser ve şubhî bazan

Nûrek fitilî li wan ji nageh
Êdî qe nema ewan çu ageh

Hindî ku di heftîya ḧemel bûn
Ew zêde di weḧşî û xebel bûn

Ew hefte li wan ku bûye salif
Xûdkerdeyê 'işqê bûn mu'alif

Rabûne ve rojekê bi yek ve
Fikrîne bi reng û rûyê yek ve

'işqê kiribûn wesa mubeddel
Wan yêk û du nas nekir ji ewwel

Ewwel dikirin ji hev teẍerrub
Paşî ku kirin bi hev teqerrub

Dîtin xwe bi paçebend û zengil
Perwaz û firîn meḧal û muşkil

Uskûfeke z̲ulmetê bi ser da
Cilfûyeke ulfetê bi ber da

Bê t̲u’me û bê şerab û bê çav
Bê meqšed û bê murad û bê gav

Mestane ji rengê çeşmê dildar
Mexmûr û siyah û mest û bîmar

Manendê dehanê yarê dilteng
Nalîn ji reha dilî wekî çeng

Gotin: ’eceb em ku bûne bîmar
Ya bûyne wekî şêrê birîndar

Ya ne wehe em çira nikarîn
Mecrûḧ û ze’îf û dilfikar în

Ev rengehe wan dikir tefeḧḧuš
Mahiyyetê ḧalê xwe tecessus

Tacdîn fikirî di dest birayî
Teysit guherek wekî çirayî

Yaqûtek e miŧlê daneyê nar
Meş'elsifet e ji bo şeva tar

Manendî şemalê ew teyîsî
Ḧekkakî bi navê Zîn nivîsî

Destê xwe dirêj kirê ku bînit
Da qenc-i nez̲er biket bibînit

Mem jî fikirî di destê Tacdîn
Elmaseke bê biha û texmîn

Lê ismê Sitî kirî kitabet
Ustadekî saḧibê meharet

Šerraf-i eger bibîte Buqrat̲
Texmîn biketin bi wezn û qîrat̲

Bazar-i biket ji bo Felat̲ûn
Mecmû'ê xeza'inêd-i Qarûn

Ṫumna ṫemenêd-i wan nigînan
Nabit bi wiqûfê dûribînan

Mayîn di te'eccub û teḧeyyur
Daman û gelek kirin tefekkur

Zanîn ku sewaḧibêd nigînan
Herçî kirî kir Sitî û Zînan

Roja weku bûye ’îd û teḧwîl
Ew jî gerîyan bi came tebdîl

Çawa xemilîne ev keçanî
Ew jî gerîyan bi cil kuranî

Ew bûne ku me di rûzê Newrûz
Miẗlê meh û mihrê ’alemefrûz

Ew herdu ne yêd dest vedimiştin
Ew herdu ne yêd-i xelk dikuştin

Ew bûne di şehrî bûne cellad
Ew bûne ku xelk ji dest biferyad

Ew bûne li van ceger kewandin
Ew bûne kovan bi dil ḧebandin

Wan herdu biran bi ’eql û texmîn
Bê şa°ibe qatilê xwe zanîn

Tacdînî li nik hebû şu’ûrek
’işqê di wî hiştibû qušûrek

Go: Rabe bira ji nav nivînan
Bes ahê bike ji ber birînan

Em şêr in û ew di xwe ẍezal in
Pur ’eyb e ku em ji dest binalin

Mem puxteyê ’işqê bû temamî
Gotî ku bira meger tu xam î

Da ẕen nebirî mucessem im ez
Ser ta bi piyan muqessem im ez

Ev cism-i li min bûye muxeṯṯeṯ
Ew xeṯ hemî bûyîne muneqqeṯ

Te°ẗîr-i we renge ’işq û wemqan
(Bil-ṯûl)-i di ṯûl û ’erḏ û ’umqan

Yek nuqṯe nehin ji derdî xalî
Hêja tu dibêy: Çira dinalî?!

Dil bûye meḧellê ’işqê ḧala
Vî ḧalî û vê meḧellê vala

Qet nîne ’eceb bibim ḧulûlî
Min maye ji šûretê heyûlî

Şahînşehê ’işqê bê xered hat
Cewher veşirî dema ’ered hat

Ev ḧal û meḧel û cism û cewher
’işqê ji xwe ra kirin musexxer

Can û ceger û dil û hinavan
Dest û ser û pê û pişt û çavan

Wellahî yekî nemaye raḧet
Billahî yekî nemaye taqet

Bizdandine wan ji min ’elaiq
(Bil-cumle) dibên ku: (Nehnû ’aşiq)

Napursî li ḧalê min tu zalim
Hêja tu dibêjî ez nenalim?!

Ev rengehe wî ku kir tezellum
Tacdînî nema ji bo tekellum

Ew man û di gel evan birînan
Beḧta me li ser Sitî û Zînan

**Mu’awedeta Sitî û Zînê ji sersal û geştê istitla’a dayê li macerayê û sergudeştê**

Ew jî vegerîn bi wî libasî
Ḧadir şelîyan ku kes nenasî

Herçende kirin libas-i tebdîl
Emma nedibûn ji ḧalî teḧwîl

’işqê kiribûn wusan mubeddel
Êdî nediçûne ḧalê ewwel

Qet kes nedigo Sitî û Zîn e
Xelqê we dizanî ecnebî ne

Dayîneke wan hebû zemanî
Teşbîhî belayê asimanî

Zala felekê li ber zebûn bû
Wê nav-i ji pîrî Ḧeyzebûn bû

Ew hate ji xefletê bi ser da
Fikrî ku cilêd-i wan di ber da

Rûniştine bê medaq û meşreb
Winda kirine deqen di xebxeb

Ye'nî di teḧeyyur û melal in
Mehpare di ḧaletê webal in

Çulwa bûye çewçemêd-i taze
Rengê semenê bi cayî ẍaz e

Kafûr-i meẗel 'ud̈arê qanî
Sorgul ger̈îyayî ze'feran î

Zanî ku perî di bêlibas in
Meclûbê meḧebbetê unas in

Go: Ey hewesa dil û hinavan
Her yek ji we ruhnîya du çavan

Ḧafid̈ ji we ra meger Xuda bit
Canê mi ji bo we ra fida bit

Hûn hinde muqeyyed in di qeydê
Îro bi tinê ku çûne šeydê

We zû şemirand ji bo çi sersal
Hûn rast-i bibên ku bûye eḧwal

Bêjin ku muqeddime çi renge
Ev ḧîret e ya xiyal e beng e

Hûn bo çi ḧezîn in ey meṯaya
Nînin çu netîce bê qeḏaya

Hûn bêjine min ku bû qeḏiyye?
Kengî li me xef dibit xebiyye

Ez dê nuhe remlekê birêjim
Ismê di ḏemîrî ez bibêjim

Yan şûşe û mendela xwe danim
Mahiyyetê ḧalî dê bizanim

Wan gotine dayeyê nihanî:
Em šubḧê ku çûne der ji xanî

Herçî li me bû du cado peyda
Ḧadir gerîya cunûn û şeyda

Axir ku ji ḧeddî çûye der cewr
Cewrê li me 'aqibet nema dewr

Em jî gerîyan melûl û meẍbûn
Hatîneve em xefîf û mexbûn

Dayîn bi te'ennî û tewella
Çû palive daye wan tesella

Go: Hûn bi cemalê Şehriyar in
Her yek ji we şah û xundikar in

Kî bit ku nebit muṯî’ û muḧtac
Kî bit ku nedit we bê ṯeleb bac

Herçî we ḧebandî ey perîzad
Ḧusna we diket ji bo we munqad

Xasma di vî şehrî bit we dildar
Ez dê wî bikem niha xerîdar

Bêjin kî ye da biçim bibînim
Haḏir bigirim ji bo we bînim

Wan gotine Ḧeyzebûnê saḧir
Derdê li me ey ṯebîbê mahir

Bê şubhe dewa ji dest te têtin
Teqrîr-i eger ji dest me bêtin

Teqrîr û edakirin meḧal e
Tedbîr û dewakirin beṯal e

Hindî hene kîj û kur di Buhtan
Belkî di cemî’î bejn û buhatn

Kes nîne bi luṯf û ḧusnê meşhûr
Illa ku di deftera me mesṯûr

Ye’nî hemî rû bi rû me dîne
Hindî di vî şehrî ademî ne

Îrohe du keç ẍerîqişîba
Ser ta bi qedem debîq û dîba

Zîbende ji şeklê şahê xawer
Tabende ji rengê mahê enwer

Nageh li me bûn ducar û ẕahir
Gêr bûne ji dûr ve herdu nadir

Em çûne bi ser binên ku kî ne
Fikrîn ne wekî me ademî ne

Teḧqîq-i melek we ya perî bûn
Lewra ku ji av û gil berî bûn

Gava ku me dîtin ew perîzad
Em jî gerîyan ji ’eqlî azad

Ew herdu wekî di camê Cemşîd
Em herdu miẗalê mah û xurşîd

Gava weku pêkve bûn muqabil
Mišbaḧ û zucac-i bûn mu'adil

Qarûre ji necmê mun'ekis bû
Nûrek me bi qelbî muqtebis bû

Qendîl û fetîle ger ji wan bû
Agir ji ruxê me herduwan bû

Zeytê me û agirê me dîsa
Ber bû me we dil me pê eyîsa

Suhtin xwe bi xwe bizan çi ḧal e
Hişyarî ye, xewn e ya xeyal e

## Ṯekrar istixbara dayeyê ji kunhê macerayê teşrîḧ û teqrîrê ewan e ji keyfiyyeta te˚sîra hewayê

Dayîn ḧeyyirî ji macerayê
Go: Ey ruḧ û qalibêd-i dayê

Hûn çûne teferruca riwalan
Fariẍ ji te'eşşuqa ẍezalan

Şeklê ku we dîtî bê me˚al e
Meyla we bi qismê jin meḧal e

Meyla beşerî beşer divêtin
Emma we keçan puser divêtin

Keç qeṯ li keçan dibin xerîdar?
Bê neqdê kuran meḧal e bazar

Kur ayîneyê cemalê ḋat in
Keç meẕhera pertewa šifat in

Bê ḋat û šifat 'ereḏ miẗal e
Cewher nebitin 'ereḏ beṯal e

Qaim dibitin 'ereḏ bi cewher?
Bê şems-i qemer dibit munewwer?

Meyla ji ruxê kuran berî bit
Sed car-i ku ḧûrî û perî bit

Ew meyl-i ku dê biket we meftûn?
Ew Leyl-i ku dê biket we Mecnûn?

Mecnûn ku nebit ’edîlê Leylê
Leylê ku diket bi Leylê meylê?

Gul qeṯ li gulan dibîte ’aşiq?
’Eḏra xwe bi xwe dibîte Wamiq?

Xusrew nebiwa siwarê Şebdîz
Şîrîn li şeker dibûye Perwîz

Ferhadî çewa surşikê purxûn
Neynanen didî siwarê gulgûn

J`ew çendehe ’alema ricalan
Begzade û sade û riwalan

Dil qeṯ we nebit bi kes ve mail
Qîzêd-i edanî û eraḋil

Bê nam û nişan û ẍeyrî me’rûf
Qelbê we bi wan ku bûye meşẍûf?

Ev emre bi min qewî meḧal e
Ev xewn e we dîtî ya xeyal e

Zînê ku bihîstin ew me'anî
Ev neẍme ji perde°î der anî

Ev rengehe gote dayeya pîr
Ẍalib te nemaye 'eql û tedbîr

Te d`go ku bi de'wet û 'eza°im
Ḧalê ku xefî bitin dizanim

Şeklê ku me dî ne bême°al e
Teḧqîq-i ne xewn e ne xeyal e

Wan ger melek û eger beşer bûn
Ger qismê nisa° û ger puser bûn

Enguşteriŷêd-i wan evan e
Înane me ew ji bo nişan e

Remlê tu bi rast eger dizanî
Xatem ev e dê bizan xudanî

Wê şehleyê ḧîlekar e cazû
Go: Bîne ji bo me xateman zû

Da îşeve remlekê birêjim
Ḧetta sube šaḧiban bibêjim

Ḧadir Sitîyê nigîn der anî
Da destê ’ecûzeya zemanî

Zînê wehe gote Ḧeyzebûnê:
Min dil bûye wert̲eyek ji xûnê

Gava weku wert̲e tête cûşê
Weqtê ku diket biket xurûşê

Teskîn diket ev nigîn dilê jar
Dem dem ku didim di çeşmê xûnbar

Zinhar-i eger dibey nigînê
Zû bîneve bo mi dilḧezînê

Lewra bi wî ye me šebr û saman
Ew bo min e xatema Suleyman

**Tefeḧḧuš û tefaula dayeyê ji remmalî ji keşfa ḧeqîqeta wî eḧwalî**

Wê delleyê bêfešal û muḧtal
Šubḧê xwe gihande pêşî remmal

Zêrek dibirin di dest xwe bo pîr
Ev rengehe kir ḏemîr-i teqrîr

Go: Min du kurek heyîn di me’šûm
Bêbab û yetîm û jar û meḧrûm

Roja weku bûye ’îd û sersal
Ew jî bi ṯerîqê ṯeb’ê eṯfal

Rabûne ve herdu çûne geştê
X̆ûlan xeleṯandibûn li deştê

Îrohe dema ku bûne peyda
Dîn in, teles in, cunûn û şeyda

Hatîneve bê libas û ṯazî
Geh geh dikirin fix̆an û gazî

Bê hiş dikevin gelek dimînin
Gava weku radibin di dîn in

Ev xateme ne, ewan di dest in
Goya tu dibêy bi van di mest in

Ey waqifê remz û kaşifê raz
Bêçare me ez, tu çareperdaz

Iḧsan bike qenc-i jê xeber de
Kanê šebîyêd-i min çi derd e

Mecnûnî ye, šer' e ya hewa ye
Çawa mereḏ e çi bo dewa ye

Ey murşid û pêşewayê muqbil
Ḧellalê 'uqûd û ḧellê muşkil

Sirrek heye wê di van nigînan
Peyda ye li nik we dûribînan

Ešḧabê nigîn bibêje kî ne
Cinnî ne, perî ne, ademî ne?

**Delalet û teqrîra remmalî ye ji bo pîrê muwafiqî (ma fid̲-d̲emîr) û muxalifî teqrîrê**

Ew warîtê 'ilmê daniyalî
Gava fikirî di şeklê falî

(Fil-ĥal)-i di reĥmê ummehatan
Bê wed̲'ê tewellida nebatan

Leĥyan û neqî bi pêkve dîtin
Tacdîn û Sitî bi pêkve dîtin

Şeklê fereĥê di gel ẍemê dî
Bê perde wî Zîn di gel Memê dî

Ev rengehe gote qašida pîr:
Meqšûd-i bi mekr û kiđb û tezwîr

Ma qet̲ dibitin ji bo te ĥašil?
Bê rastirewî meĥal e menzil

Te d`go ku kurêd-i min di dîn in
Nabêjiye min Sitî û Zîn in

Roja weku çûne geşt û seyran
Wan dîne li rê du dîde ĥeyran

Ye'nî ku du kur di serwiqamet
Rabûye li wan kuran qiyamet

(Fil-ĥal)-i evan du afitaban
Dil çûyeve bal du mahitaban

Ew bûne ji 'işqê van di bêhûş
Ev bûne ji ĥusnê wan di medhûş

Ew şîfiteyê belayê 'işq in
Ew teşneyê kerbelayê 'işq in

Ev xatemeyêd-i wan kuran in
Van jî du nigîn di destê wan in

Çawa xemilîne ev kuranî
Ew jî gerîyane cilkeçanî

Pîrê wihe gote şeyxê remmal
Min şubhe nema di keşfê eĥwal

Lêkin tu bibêje ew çi eşl in
Qenc keşfê bike ku ew çi nesl in

Begzade ne, ew 'elîmeqm in
Cindîneseb in we, ya 'ewam in?

Şeyx go ku di dînê 'işqibazî
Bey'ek heye ew dibên teradî

Bê şertê kefa'etê rewa ye
Şertê mute'aqidan rida ye

Xasma ku kurêd-i wan bijarî
Durdane ye yek û yek mirarî

Begzade ye yek ji neslê mîran
Yek jî bi neseb kurê debîran

Wê sahireyê ji bo nişane
Dîsan xeberek kire behane

Go: 'aşiq û mubtela û dînan
Meftûnê ji bo Sitî û Zînan

Ew nabine qabilê hisaban
Nagencene defter û kitaban

Şeyx im tu dizanî ev Cezîr e
Têkda kubera û kurdemîr e

Ihsan bike perdeyê hilîne
Ew herdu melek bibêje kî ne?

'ehda me we bit tenê bibînim
Çil zêrî biçim ji bo we bînim

Şeyx go: Tu here bibîn wişaqan
Teftîşê bike cih û wiïaqan

Herçî ku dibêjin ew 'elîl e
Ew 'ill e ji bo te ra delîl e

Binmê xwe bi šûretê tebîban
Bê perde dibînî wan ħebîban

Gava ku te dîtin ew melekwar
Keşf e ji qumaşî ra xerîdar

Xasma ku di destê wan nigîn in
Menqûş-i li wan Sitî û Zîn in

Rabûve 'ecûze şubhî Luqman
Ser ta bi qedem dewa û derman

Qarûre û ħuqqe, niştər û kîs
Hilgirtin ewa xebîïe telbîs

Danî paxila xwe çend kitêbek
Dinma bi ħekîmekê 'ecêbek

Ḧaḏir xwe gihande pîşekaran
(Fil-ḧal)-i bûye nedîm û yaran

Wan go: Tu ji kû ve tê çi pîr î?
Ẍalib tu ji ’ilmekî xebîr î!

Go: Gerçi ku ẕahirî ḧekîm im
Zêde bi du ’illetan ’elîm im

Zail dikim ez qewî du janan
Derdê bedenan û derdê canan

Wan go: Tu ji bo me ra xeber de
Derdê ku li canî bit çi derd e?

Wê gotî: Meger ku hûn nebînin
Wî derdî ’elamet in nehîn in

Ew derdekî zêde bêmecal e
Šiḧḧet ji wî derdî ra meḧal e

Dûr bit ji we, ew gelî riwalan
Ew berq e di šûretê şepalan

Gava vedidet wekî birûsk e
Bê şu’le û pêt û bê çirûsk e

Bê cerḧ e û qerḧ e û birîn e
Navê li wî derdî her evîn e

Emma we disojitin hinavan
Xûna dilî tê ji her du çavan

Wan gotine wê ku xeyrîmeqdem
Ḧala nexweş in ji me du hemdem

Iḧsan bike herduwan dewa ke
Derman ke bi new'ekî tu rake

Herçî tu dibêjî em wesa kin
Herçî tu dixwazî em eda kin

Pîrê xwe gihande nik merîḏan
Weqtê fikirî di wan 'ezîzan

Wê gote bi hemdem û delîlan:
Tenha me bihêlin û 'elîlan

Da ez bikerim wî derdî teşxîŝ
Paşî bikim ez dewayî telxîŝ

Hevrê hemî çûne der ji ba wan
Pîr ma û tenê di gel du lawan

## Hemšuḧbetîya wişaqan bi hemliḧûqîya miştaqan û waẗiqîya wê ye li ser weqtê ’uşşaqan

Bîmar-i bi derdê ’işqê bedḧal
Nageh fikirîn ku çûne haval

Rûniştî li pêşî wan ve zalek
Qametçivîyayî reng hilalek

Aheste kelamekî dibêjit
Digrîtin û hêstiran dirêjit

Gotin: Çi kes î tu ey dilaram
Bo çi digirî wiha bi nakam?

Wê go: Bi serê Sitî û Zînê
Meḧḏa ji we ra dikem girînê

Mexšûš-i ji nik Sitî û Zînan
Hatim li we xweş bikem birînan

Enguşterîyê di we eva ne
Înane mi wî ji bo nişan e

Hûn hilgirin û biden nigînan
Bednam-i meken Sitî û Zînan

Ez qašid û hûn ji bo mi meqšûd
Hûn min meken ey murad-i merdûd

Ev mujde dema ewan kirin gûş
Yekcar-i ji şahîyan nema hûş

Hişyar-i ku bûn demek newestan
(Fil-ḧal)-i bezîne pê û destan

Tekrar-i li dest û pê û dawan
Sed bûse didan ewan du lawan

Dayîn ḧeyirî ji iştiyaqê
Berda girîyê ji iftiraqê

Go: Ẍem mexon ey murad û meqšûd
Mizgîn ji we ra bi ḧeqqê Me’bûd

Tewfîqê refîq bitin ji Barî
Ez dê we bikim bi siḧrikarî

Hûn cumle li ’erdekî cema bin
Her çar-i bi meqšeda xwe şa bin

Nam û neseba xwe hûn ’eyan ken
Sirra dilî bo mi ra beyan ken

Da ez vegerim bi van nigînan
Tesxîr-i bikem Sitî û Zînan

Te'cîl-i bikem ji bo ïewabê
Zû bêmeve ez di gel cewabê

Tacđînî nigîn ji dest der anî
Da destê 'ecûzeya zemanî

Mem tê fikirî ku bê nigînê
Kengî diketin medar û jînê!?

Go: Daye, tu min bigêre me'đûr
Kî canî didit ji dest xwe destûr

Ev xatem e, ism e ger ṯilism e
Min can ew e, qalibê mi cism e

Ey daye tu qašidê ħebîb î
Bê şubhe li derdê min ṯebîb î

Šedqa serê (đîl-cemal)ê Zînê
Mestîne ji destê min nigînê

Gava tu diçîve ey wefadar
Ev renge ji min bibêje dildar

Ew şah e, eger çi ez geda me
Elṯafê şehnişehan e ’am e

Ez bende, ne la°iqê wišal im
Xursende bi šûretê xeyal im

Raḏî me ji ew qeder cemalê
Min bînite xelweta xeyalê

Her gah-i ji ahê dil bitirsit
Geh gahê li ĥalê min bipirsit

**Vegerîyana dayeyê vi bal dildaran**
**agehkirina wan e ji ism û resmê birîndaran**

Ew herdu nihalê ’er’era şeng
Rûniştî miẗalê ẍunçe dilteng

Civyayî bi fikr û sernişîvî
Her leḧẕe ji dayeyê bi hîvî

Mexmûrê ẍebûqê bênihayet
Muştaqê šebûḧê bûn bi ẍayet

Dîtin ku ji nagehî ṯebîb e
Wê hat-i bi šûretek ’ecîb e

Zîn û Sitîya ji ’işqê medhûş
Wan daye kirin rewan deraẍûş

Gotin: Bi Xudê key ey dilaram
Aya te ku dîne ew melekram?

Remla te çi go? Perî te zanîn?
Yan herdu di şûşeyê te anîn?

Tîra li me kunkirî siweyda
Aya te beyan nekir ku key da?

Wê go: Bi serê we ê mubarek
Sed car-i qesem dikem ne carek

Ez hatime vî demî ji ba wan
Emma guneha me tê bi lawan

Her dem ku Sitî û Zîn dibêjin
Sed rengê sirişkê xûn dirêjin

Qurbanê we bim bi vê kemalê
Ew herdu beşer bi wê cemalê

Çawa we bijarin ew du mumtaz
Zîbendeyê wešl in ew serefraz

Wellahî qesem dikem bi Barî
Ew herdu durêd-i we bijarî

Nabin di çu berr û beḧr û kanan
Nînin we melek di asimanan

Ew herdu ji bo we ra seza ne
Mîrza ne eger we ger geda ne

Ew delle bi dil we bûye dellal
Dildade ji pêş ve man demek lal

Zîn û Sitîyan nema di dil hûş
Gava ku ewan kir ev xeber gûş

(Elqišše) ji gunhê macerîyê
Hişyarî ku dayeyê didayê

Agir te digo gihande neftê
Pêt jê diçû asimanê ḧeftê

'işq agir e ten Çiyayê Ṯûr e
Dil ew şecera bi nar û nûr e

Mişkat e qefeš qebes çira ye
Can zeyt e fetîlê wê xefa ye

Dil şûşe ye ew çira di nav e
Surr cuz' e di kullê da belav e

(Bil-kul) ji serî ḧeta bi eqdam
Suhtin bi wî agirî dilaram

Gotin: Ji me ra tu dilnewaz î
Ey daye ji bo me çaresaz î

Dihqan tu yî em wekî nihalîn
Ezman tu yî em bi xwe dilalîn

Ger leḧẕeyekê nekî tu guftar
Ger sa’etekê nebî tu ẍemxwar

Em dê weku xar û xes heba bin
Em dê weku bergê berhewa bin

Ey waqifê waqi’atê dêrîn
Em ẍeyrî te meḧreman nedêrîn

Tacdîn û di gel Memê te gotî
Perwane ne, per li wan me sotî

Ew jî nihe pur di intiẕar in
Belkî ji me zêdetir neçar in

Rabe here zû bibêje Tacdîn
Ger dê te Sitî bivê Memê Zîn

Mizgîn ji we ra me hûn qebûl in
Em jî ji we zêdetir melûl in

’işqa we cilew ji me reva ye
Mani’ li me perdeya ḧeya ye

Ew perde ji bo we ra ’edîm e
Bê perde ji bo we ra qedîm e

Xwazgînî wesa'it û wesîle
Herçî ku ji ba we bên cemîl e

Ev renge bibêje wan ĥebîban
Mecmû'ê mewalî û xetîban

Hindek ji we ra bibin ricaçî
Hindek ji me ra bibin du'açî

Belkî kiribit Xudê muqedder
Wešla me û we bibit muyesser

**Şifabexşîya t̲ebîbeyê li derdê 'elîlan**
**bi şefeqet û merḧemeta mîr li ḧalê ďelîlan**

Xweş weqt e ji bo 'elîlê muştaq
Xasma ku ji bo qebîlê 'uşşaq

Dermanekî šiḧḧet û şifayê
Mizgîn û beşareta wefayê

Nageh bigehîte wan ji der dan
Azade biket ewan ji derdan

Ew daye ji rengeristet̲alîs
Ser ta bi qedem libasê telbîs

Dîsan ketî šûretê t̲ebîban
Ḧad̲ir xwe gihande nik ḧebîban

Ew mujde wekî me gotî gotin
Ew sotê wekî nesotî sotin

Emma bi wî agirî we geş bûn
Te d`go qe nexweş nebûn di xweş bûn

Goya ku ewan ji dest Felat̲ûn
Xwarin bi yeqîn dewa˚ û me'cûn

Rabûneve çûne nik hevalan
Çendek ji meḧarim û riwalan

Agah-i kirin ji macerayî
Rabûn bi te’eššub û tebayî

Gava ku ewan bihîste mizgîn
Hay dan bi tebayî xelq û xwazgîn

Hindek ’ulema û hin di ’adil
Hindek umera û hin di cahil

Rabûneve cumle çûne nik mîr
Ev renge kirin qeḏiyye teqrîr

Kay walîyê mulk û mal û millet
Wey ḧamîyê dad û dîn û dewlet

Tu sayeyê luṯfê kirdigar î
Îro li me şah û xundikar î

Şahî neẕera te kîmiya ye
Mahî eẗera te pur ḏiya ye

Herçî te vexwende ew ’ezîz e
Herçî te nexwende bêtemîz e

Herçî te kire çiraẍ û geş kir
Ger ḧalê xerabe jî te xweş kir

Tacdîn-i eger çi mîriza ye
Nisbet bi te bende ye geda ye

Hatîn ku bikeyn ji dil du'ayê
(Fil-cumle) dikeyn ji te recayê

Tacdîn Sitîyê ji te dixwazit
Ew qul bi çiraẍîyê dinazit

Ew bende ye wî bigêre azad
Zîbende ye wî bidêre damad

Mîr go: Ku heçî we dîtî la°iq
Elbette ji bo me ra ye fa°iq

Herçî ku wekîl e bêt û rûnit
Mewla kî ye xuṯbeyê bixûnit?

'eqda Sitîyê me kir li Tacdîn
Îcab e, ev e qebûl e amîn

(Fil-ḧal)-i Çeko bezîye pê mîr
Teqbîl-i kir û qebûl û teqrîr

Mecmû'ê mela û şeyx û mîran
Aẍa û ekabir û feqîran

Vêkra bi devê xwe wan ẗena kir
Têkda bi dilê xwe wan du'a kir

Mîr got: Biqutin def û rebaban
Bînin hemî şerbet û şeraban

Da bezmeke şadimane danîn
Îrohe ku šubḧe em nizanîn

Dê şubhetî vî demî di xweş bîn
Ya dê bimirîn we ya nexweş bîn

Ḧubla ne leyalî ey mewalî
Kanê çi dizên ('elet-tewalî)

Ev şîwen û şahî tew'eman in
Ev çrex û felek di bêeman in

Geh nûrinuman e gah-i muẕlem
Geh sorinuman e gah-i me'tem

Gava ku dibînî weqtê 'işret
Da fewt-i nekî zemanê furšet

Lewra ku zeman miẗalê şîr e
Nabêjitin: Ev mela ye mîr e?!

Îrohe ji bo riḏayê Tacdîn
Min jî ji xwe ’ed biken bi xwazgîn

Ev çend-i zeman e ew ẍulam e
Daim di ẍulamîyê temam e

Ew hind e di xidmeta me da bû
’umrê wî di ber me da fena bû

Şerṯ e di şerî’eta wefayê
Em jî ji wî ra bixwin cefayê

Îrohe bi xidmeta wî rabîn
(Bil-d̈at)-i di xidmeta wî da bîn

Mêrê wihe kê bitin ku canî
Şabaş nedetê bi şadimanî

Ger min hebitin hezar û yek ser
Wan cumle di rojekê bi defter

Ger ez nekerim feda bi carek
Mîrînî li min nebit mubarek

Tacdîn ku di xidmeta emîr bû
Çeşna wî di dest û çeşnegîr bû

(Elqišše) bi şewketa xwe ew mîr
Rabû bi xwe bûye çaşinegîr

Kêşa wî bi meclisa xwe xwanek
Goya kire ferşê asimanek

Quršê meh û mihrê asimanî
Înan te digo bi cayê nanî

Ev lengeȓîyêd-i zîv û zêȓîn
Şubhet felekêd-i jor û jêȓîn

Her šeḧnê mezin miẗalê burcek
Serpoş-i li ser ji rengê durcek

Her tepsî û kaseyêd-i feẍfûr
Yek exterê pur ḏiyayê pur nûr

Cedî û Ḧemelêd-i asimanî
Buryan û kebabê mîhimanî

Her kase û tepsîyek yek enbaz
Serşar-i şebîhî nefsê emmar

Enwa'ê te'amê çurp û şêrîn
Elwanê ẍiđa' û nuqlê rengîn

Van meşrebe û eyaẍê çînî
Dewran dikirin bi nazenînî

Seyyarešifet bi geşt û seyran
Herçî ku didî dimaî ḧeyran

Narinc û turinc û nar û lîmû
Newbaweyê şaxisarê mînû

Fanîđ û nebat û qend û şekker
Mawerd û zubad û misk û 'enber

Hindan dikirin me'îde ẍaze
Hindan dikirin dimaẍ-i taze

Mecmer gerîyan bi 'ûd û 'enber
Bûn cumle meşamê canmu'enber

Ramişgerê xweşnewa û xweşdeng
Şayesteyê xweşqumaş û xweşreng

Hevdeng-i hinek bi šewt û sazan
Hemreng-i hinek bi fexr û nazan

Muẍnî û kemançe, ’ûd û t̠enbûr
Çeng û def û zûrina û šentûr

’uşşaq û newa ’iraqî û ewc
Vêkra dikirin bi rastîyê zewc

Awaz e û şu’be û meqamat
Bê perde bi mu’ciz û keramat

Z̠ahir ku dibûn ji nayê gerdan
Ẍaret dikir ’eql û dîn û îman

Saqî şewişîn bi abê engûr
Mut̠rib herişîn bi šeytê šentûr

Qewwal û muẍennî û ẍezelxwan
Mexmûr û siyah û mest û sekran

(Elqišše) li reẍmê seb’ê şeddad
Danîn bi wî resmî ’urs û binyad

Xet̠t̠at̠ê felek ji dest qelem ket
Celladê felek ji dest dudem ket

Nahîd-i bi ’erdî da dida çeng
Meh çû veşirî di burcê Xerçeng

Keywan-i di Delwê da nihan bû
Bercîs-i di Ḧûtî da nişan bû

Dunya hemî bûye 'eyş û 'işret
Zala felekê ji kerb û ḧesret

Çu j`dest nedihat û maye 'aciz
Naçar e 'ecûz e bûye Kadiz

Şeyxûxeyê çerxê rengsemawî
Rehwar-i sema'-i kir rihawî

'alem hemî bûye 'işretabad
Şehrî û bedewî, 'ebîd û azad

Musteẍriqê ni'met û ṯereb bûn
Mustecmi'ê şahî û le'eb bûn

Rabûve ku xwan ji ber xewašan
Saqî gerîyan bi cam û kasan

Mîr xwendine pêş Memo û Tacdîn
Go: Xerc e li min Memo tu şuşbîn

Ew herdu kirin temam-i melbûs
Rabûn bi edeb etek kirin bûs

Rûniştin û pêkve wan vexwarin

Ew roj-i bi yek ve ra biwar in

**'erûsîya Sitî ji bo Tacdînî**
**tehyi°eyê esbabê şahî ye ji bo tihnîya ẍemgînî**

Weqtê weku nû 'erûsê xurşîd
Nuh qubbe mi̇̈talê camê Cemşîd

(Fil-cumle) kirin bi rux mucella
Goya ku kirin bi zer mutella

Meşşate û daye û peristar
'işqê kirî cumle germibazar

Çûn zeyn-i biken Sitî û Zînan
Nazende biken du nazenînan

Ewwel fikirîn di zulf û xalan
Dîtin ku dilan diben bi talan

Gava fikirîn di qewsê ebrû
Bûn şubhetî wesme jê siyehrû

Fikrîne ruxê di wan di taze
Şermende dibûn bi cayî ẍaze

Qadir nedibûn ji surmeyê reş
Ahûyê xuten biken muşewweş

Ser ta bi qedem ji rengê şane
Sed se'y-i kirin ji bo behane

Meḧḏa ji du ahuyan yek ahû
Wan seh nekirin ḧeta serek mû

Illa serê mûyekî meyan bû
Ew jî bi meẗel ne ten ne can bû

Qeṯ'a ji mexafeta şikestin
Qeṯ lê kemerek nehate bestin!

Kes dil nedida çu lê bibînit
Belkî ku ji nazikî şikînit

Ma dest-i dida ku dest û pence
Ḧenna biketin bi rengê rence

Neqşê ku Xudê kirî muxeyyer
Kî qadir e wî biket muẍeyyer

Axir gerîyan ji rengê me°yûs
Ew man û ḧena û reng û pabûs

Zînet ji qedê di wan ḧebîban
Bexşîne zemîn ṯela û şîban

Ferxunde kirin bi ferqê efser
Tabende kirin bi tacê gewher

Serlewḧeyê sefḧeyê mušenne'
Zîbende bi zîwerî mureššeʼ

Pîra ye ji rewneqa cemalê
Bû hale li xermena hilalê

Elmas û zumurrud û mirarî
Xal û xeṯ û ṯurreyêd-i ṯarî

Manendê kitabê şa'iran e
Mewḏû'ê bi weḏ'ê xanexane

Ev rewneqê 'ariḏî û đatî
Bû nusxeyê siḧrê mu'cizatî

Ebyat-i bi cem'-i bûne dîwan
Ayat-i bi šun'-i bûne Qur°an

Ew šun'etê ûsitadê muṯleq
Herçî ku didî digo (hiwel-Ḧeq)

Tezyîn ku temam-i bû li bûkan
Ayîn kete çarisû û sûkan

Enwa'ê tecemmul û melabis
Elwanê cewahir û nefais

Sed carî ye û du sed benî çûn
Zerbeftilibas û zerbenî çûn

Naqe bi qiṯar û der bi qinṯar
Yaqût-i bi bar û zer bi xerwar

Xaric ji te'edduda ḧisaban
Xariq li teqeyyuda kitaban

Nedhate te'eqqul ev cihaze
Nedbûn muteḧemmil ew cemaze

Vê debdebeyê we kirne 'aşiq
Bû zelzele rakirin xela°iq

Şehrî ji muďekker û mu°ennes
(Fil-cumle) muzeyyen û mulebbes

Teşbîhî bi beḧrê pur temewwic
Cunbiş dikirin ẍereḏ teferruc

Nageh gerîya bi cûdê meftûḧ
Dergahê kerem li keştîya Nûḧ

Ye'nî ku 'imareya Sitî tê
Qešra perîya bi rasitî tê

Her texte ji 'ûd û šendelûsî
Textek xetebend û abinûsî

'erşek ji cewahiran murešše'
Belqîs-i celîs û lê murebbe'

Dest bestî ji pêş ve pîşekaran
Zerrînkemer û gewherguharan

Šed Ašif û Berxîya wekî ba
Ḧemmalî dikir bi 'erşê dilşa

Hilgirtine ser serê xwe ew mehd
Dest dest direvan ji hev bi sed cehd

Ew texterewan wekî gemî bû
Beḧra ku bi serket ademî bû

Beḧrek ji hewa ku bête coşî
Naçar-i ji dil diket xuroşî

Xelqê cihê cumle 'aşiqan e
Perwane û şem'-i der meyane

Šûfî û mela û feqîr û paşa
Vêkra li teferruc û temaşa

Xelqê ku ji dest ẍeman biferyad
Ferdek qe nema nebûyî dilşad

Her ber derekî şemateyek lê
Her mecme'ekî temaşeyek lê

Te d`go ku 'erûs 'eynê can e
Lew bûne beden li pê rewan e

Sazan mirî ḧey kirin wekî šûr
Kûs û dev û kerrena û naqûr

Şabaş û šeda û kazekazan
Guhdar-i ẍenî kirin ji sazan

Vêkra ku šeda ji wan bi der ket
Qešra felekê šeda bi ser ket

Ev 'eyş û nişat û şadimanî
Nadîde bi dîdeya zemanî

Fulka feleka melek di navê
Mewcan ku reva di weqt û gavê

Ev t̲ent̲ene û şi’ar û ayîn
Çûn leḧz̲eyekê gihane Tacdîn

Tacdîn bi xwe bûye padişahek
Mem jî li tenişt̂ê şubhê mahek

Rûniştî di şehnişînê ’alî
Cem’ê ji ekabiran ḧewalî

Rabûn li teferrucê vewestan
Wan cumle t̲ebeq di herdu destan

Manendê t̲ibaqê asimanî
Yaqût û zumurrdêd-i kanî

Rêhtin t̲ebeqêd-i wê niẗarê
Jor da li ’imar̂ya nigarê

Emma t̲ebeqê di wan hemî pur
Zîv û wereq û cewahir û dur

Yeẍma kir û genc-i bûne maşa
Xîzan hemî bûne mîr û paşa

Sed car-i li hîvîya ḧerîšan
Xaric ji cevandina xesîsan

Faḏil ji kerameta kerîman
Zaid ji xudanîya le˚îman

Xîzan û geda we bûne mun’im
Muflis bûne zenperest û muẍlim

Xîzan û geda, ẍenî û zengîn
Şadan û ḧezîn û şa û ẍemgîn

Êdî nedibûn ji hev muşexxeš
Te d`go hemî mîrek in murexxeš

Têkda di munasib û muwafiq
Vêkra di mušafiḧ û mu’aniq

Ḧašil ku ji meqšeda seramest
Bûn ew der û ban û ew sera mest

Hin mest û hinek dîger di bengî
Xwanende û beďlego û çengî

Her bengî û serxweşê di Buhtan
Têk hatine çerx û baz û lotan

Bîrîte sema û saz û govend
Şêrînê şekerleb û şekerxend

’ed̈ra û riwal û bikr û murdan
Ḧûr û melek û perî û wildan

Gulpîrehen û semenqebayan
Şekkerdehenan û qendixayan

Zerrînkemeran û keckulahan
Ṯel’etqemeran û xeṯsiyahan

Sîmînbeden û semen’ud̈aran
Sêvînd̈eqen û memikhinaran

Ev mûyimiyanê marigîsû
Ev çardehisalê çariebrû

Murdan û murahiq û mucerred
Lawê digo xeṯ wekî zumerred

Xweşdeng e hinek, hinek di xweşreng
Hin cergebezî û hin dîger leng

(Bul-cumle) li reẍmê vê ’ecûzê
Ye’nî li xîlafî puştikûzê

Qîzêd-i sivik kurêd-i lawîn
Manendî benat û mis̈lê perwîn

Hin dairebend û hin di dewwar
Hin silsilebend û hin di seyyar

Encumšifet encumenfurûzan
Heft şev di temam û heft-i rûzan

Bezma Sitîyê û cem'ê Tacdîn
Gêran bi vî rengî zîb û tezyîn

## Meqalê işti'alê şem'ê cemalê meḧbûb e
## meqamê intiqalê iştiẍalê wišalê met̠lûb e

Damanê 'erûsê pakê gerdûn
Damad-i ku kir bi mihrê gulgûn

Tarîtî bi ruhnîyê ku rakir
Ẍem şubhetî z̠ulmetê fena kir

Weqtê seḧerê ji rojê ḧeftê
Agir te digo gehişte neftê

Germiyetê narê qurbê meqšûd
Rakir ji wicûdê 'aşiqan dûd

Cem'iyetê xaš û ateş û bad
Elbette diket mirovî berbad

Ev 'işq û hewa ku bûne dildaş
Can û dilî dê biden bi şabaş

Šebra şewitandî iftiraqê
Têk suhte qiran û iḧtiraqê

Deryayê meḧebbet uştulum kir
Aram û şekîb û šebr-i gum kir

Meḧbûb û muḧib ji fert̲ê teşwîr
Hatin ku bibin bi şewqê teqdîr

Meşşat̲e û mihriban û dayîn
Şuşbîn û meḧarimêd-i Tacdîn

Mustewcibê weqtê dîn mulaqat
Ber mûcib û muqted̲ayê ’adat

Mecmû’ê mubexxirat û mu’t̲ir
Memzûcê muferriḧat û muskir

Cam û qedeḧ û iyaẍ û mexmer
Ev misk û zebad û ’ûd û mecmer

Mawerd û gulab û ’et̲rê şahî
(El-qišše) ji mahê ta bi mahî

Esbabê nişat̲ û ’eyş û ’işret
Alatê šefa û ḋewq û šuḧbet

Ew çend-i kirin ewan muheyya
Meḧd̲a mirî pê dibûn muḧeyya

Arasite bû ’erûsixane
Dîwar û der û ’urûşixane

Rabûneve xašekî û xadim
Hindek di eqarib û mehärim

Şem'ek bi temameyê muṯella
Şemsek bi cemaleyê mucella

Hilgirtine ser serê xwe reqqaš
Înane miyanê meclisa xaš

Şem'ê bi zebanê ḧal-i bê qal
Ev rengehe kir beyanê eḧwal

Kay 'aşiqê bêqerar û bêtab
Ger şubhî min î xudan teb û tab

Rabe here ḧecleya 'erûsê
Pabende bibe bi payîbûsê

Şem'a te wekî te intiẕar e
Şewqa te li can û cismî nar e

Suhtin ne bese mitalê şem'an
Bes şubhetî min bibare dem'an

Ger 'aşqî rabe şubhî ferraş
Canê xwe bide nitar û şabaş

Ey sa'îyê meqšeda ṯewafê
Wey salikê menheca meṯafê

Ew qible û ke'beya te meqšûd
Nêzîkî te bû bi emrê Me'bûd

Beyt û ḧecer û meqam û ḧucre
Se'y û ṯeleb û ṯewaf û 'umre

Barî ji te ra kirin muqedder
Ha bûne ji bo te ra muyesser

Av î tu rewan be pêşî selwê
Şêrîn tu heman kerem ke xelwê

Tacdînî ji šûretê şemalê
Me'nayê meḧebbeta şepalê

Zanî bi te˚emmul û bi idrak
Rabû ji cihê xwe çust û çalak

Yarê ẍem û şahîyan Memê jar
Vêra bûye šaḧib û sileḧdar

Destê wî di dest û dil di dil bû
Bû ḧacibê derge, şîr li mil bû

Tacdîn bi vî ṯerzî çû serayê
Mem ma li derî di gel du’ayê

Lewra ku muxewwf bû mulaqat
Melzûm e li ’aşiqan mu’adat

Ger qismê muḧibb û ger ḧebîb in
Elbette bi dujmin û reqîb in

Hin dêw û hinek ji wan perî ne
Hindek di munafiq ademî ne

## Wišûlê Ke'beyê murad û tewaf e û ȟušûlê meram û zefaf e

Zava bi edeb ku çû ji derdan
Şem'a ku li pêş ȟicab û perdan

Rabû ku ji pêr ve çu xiraman
Kêşa li zemîn bi naz-i daman

Zulfêd-i xwe kirne payiendaz
Destêd-i xwe kirne ferqê perdaz

Dêma ku bi nûrê (Beytul-Eqša)
Qendîlê felek bi wî teyîsa

Mexmûrê xebûqê derdê hicran
Muştaqê šebûȟê wešlê canan

J`ewwel ve li 'adetê mubaȟî
Destê xwe dirêj kire šuraȟî

Nûşî ji šuraȟîya şekerleb
Nûşîn qedeȟek ji mey lebaleb

Mexmûr-i ku def'-i kir meya nab
Bihn kir gul û sunbulêd-i sîrab

Geh nergis û lale gah-i sorgul
Reyḧan û binefşe gah-i sunbul

Têk têkve didan û têk dibestin
Hin bose didan û hin digestin

Ew çend-i bi yek ve radimûsan
Newbet nedidane hev li bûsan

Elmas û guher cebîn û dindan
Tebdîl-i bûyîn bi le'l û mercan

Deryayê meḧebbetê we kir cûş
Dest gerden û leb bi leb hemaẍûş

Medhûş-i bûyîn bi wê mudamê
Bêhiş we ketin ji ser qiyamê

Qadir nedibûn biken qu'ûdê
Gêr bûn-i bi yek ve bo sucûdê

Tekrar-i ji secdeyê ku rabûn
Ew çend-i bi yek ve her du şa bûn

Şekker ji lebêd-i yek revandin
Sorgul ji ruxêd-i yek civandin

Terkîb-i kirin ji bo xwe gulqend
Tezwîc-i ku bûn bi yek ve dilbend

Sê roj û şevan bi dil peyapey
Wan teşneleban vexwarin ew mey

Mustesqî û şerbeta meya nab
Axir ku nebûn bi şurbê sîrab

Keyfiyetê neş˚eya şerabê
Kêşane kemalê iḏṯirabê

Šafîđiqen û bedenşefafê
Kir meyl û meḧebbeta zefafê

Sermest û bi dest-i têk heristin
Bû gelte û gelc û dabiristin

Dem lêk biçiyan û dem cuda bûn
Geh têk hejîyan û geh di ba bûn

Dem ew didu bûn û gah-i yek bûn
Geh cot û bi yek ve gah-i tek bûn

Tîra ku ji 'acê ber hedef bû
Amac-i bi šefweta šedef bû

Amac-i ku bû meḧellê peygan
Durdane bedel kirin bi mercan

Nebl hateve nešl-i ma di wê da
Nesla xwe ji can û dil bi wê da

Peywest e bi roj eger bi şev bûn
Wan pur ji meḧebbetê bi hev bûn

Hemware du serxweşêd-i serkiş
Vala dikirin li yek du tirkiş

Ger roj û weger şevêd-i reş bûn
Ew herdu melek we pêk di xweş bûn

Goya te digo du kîmiyager
Meşẍûl-i bûyîn bi 'iqdê cewher

Ew rûḧ û cesed bi yek ve munḏem
Nefseyn-i bi yek ve bûne mudẍem

Inzalê legen nizûlê ibrîq
Teš'îd-i kirin bi qer' û enbîq

Memzûc e şebîhî şîr û şekker
Mexlûṯ e wekî ḧeyat û Kewẗer

Qeṯ’a çu nebû ne xur ne xwabek
Wan bîr nedihate nan û abek

Ew hefte temam-i bûye gerdek
Agah-i nebûn ji ḧalê ferdek

Ẍalib gerîya li derdê šiḧḧet
Ẍem çûn veşirîn ji kerbê wešlet

Nageh seḧerê ji rojê ḧeştê
Riḏwan meşîya ji nîv beḧeştê

Mem hêj-i wisa li ber derî bû
Da˚im ewî ser li ser berî bû

Hêja ewî mesken asitan bû
Rojan û şevan we pasiban bû

Tacdîn ku ji gerdekê bi der ket
Rojek te digo Memê bi ser ket

(Fil-ḧal)-i we renge şadiman bû
Hem efser û ewcê asiman bû

Yarek te hebit meger we bîtin
Ger dê we nebit meger nebîtin

Yarê bi te ra bitin muwafiq
Sed xizmêd-i xain û munafiq

Qurban bike qeṯ mebê mixabin
Çi d`key bi kesan ku bêwefa bin

Qurban bide qeṯ mebêje kî ne
Bêkêr e bira eger bikîn e

Yarê te ji bo te ra bira ye
Hem çav e ji bo te, hem çira ye

## Ḧîleperwazî û fitneengîzîya Bekir e ji ḧesedbirna li Tacdîn ku bûy sebebê mîr neda Memê Zîn

Gava ji ’edem Xudê kir îcad
Ev kewn û mekan ji nû ve binyad

Mecmû’ê mukewwinatê ’alem
Ḧetta ve xelaše new’ê Adem

Eşya bi ḧeseb, šifat û ef’al
Înane wucûdê muxtelif ḧal

Mewcûd-i kirin bi hev mu’eyyen
Eḏdad-i kirin bi ḏid mubeyyen

Ev erḏ û sema, beṯî° û dair
Ev mulk û melek, muqîm û sair

Ev nûr û ẕelam û kufr û îman
Ev xuld û seqer, biheşt û nîran

Ev barid û ḧar û reṯb û yabis
Ev mîr û geda, ẍenî û bais

Ev ax û hewa û agir û av
Ev leyl û nehar û sî û sîṯav

Ev hecr û wišal û şahî û ẍem
Ev mewt û ḧeyat, surûr û me˚tem

Hin nûr-i miẗal û hin wekî nar
Hindek di ḧelîm û hin di dijwar

Van šadiq û rast û xêrixwahan
Van qumšî û xwar û rûsiyahan

Van ehlê cehennem û ’eḋaban
Van laiqê cennet û ẗewaban

Nabînî ku pêkve cumle d̲idd in
Ḧikmet çi ye? Bo çi pêkve nidd in?

Lewra ku nebit eger texaluf
Temyîz-i meḧal e hem te’aruf

(El-qišše) bi iqtid̲ayê xilqet
Mîrê bikemal û ’izz û rif’et

Ragirt-i ji bo xwe dergevanek
Fettanê zeman e šeypišanek!

Daim li derê wî qapuçî bû
Qella’ û qelaş û qehweçî bû

Emma bi neseb nemerdê Buhtan
Belkî mutewellidê ji buhtan

Ešlê wî dibên ji Mergever bû
Meḧḏa wî beşer bi şor û şer bû

Navê wî munafiqî Bekir bû
Belke ji belûqîya betir bû

Menna’ û mud̈ebd̈ebîn û Iblîs
Xedda’ û xeberbezîn û telbîs

Şagirdê şe°ameta wî Şeyṯan
Şermende ji guhtina wî buhtan

Bedçehr e ji rengê dêw û kabûs
Bedfi’lê sitîzekar û salûs

Tacdîn-i digote mîr ’eyanî:
Mîr im bike der vî dergevanî

Ev laiqî dergehê te nîne
Ev kelb e, nihîndir e bikîn e

Herçend še û dergevan bira ne
Ekẗer še bi mihr û ba wefa ne

Ev rengehe mîr digote Tacdîn:
Fi’lêd-i Bekir meger nizanîn?!

Em qismê emîr-i qismê aşîn
Purfetl û gerîn û pêş û paşîn

Naçar e ji bo me aşivanek
(La-budd e) ji bo me dergevanek

Hindî bi ḧukûmetê dikîn dewr
Geh ’edl e ji bo me kar û geh cewr

Herçend-i Bekir weledzina ye!
Aşê me ji wî bi fetl û ba ye

Ev zumre ku z̲alim û ’ewan in
Sûbaşî û şeḧne dergevan in

Aşêd-i me z̲aliman digêrin
Dexlêd-i me z̲aliman dihêrin

Aşê me eger çi weqfê ’am e
Gewrî tijî garisê ḧeram e

Wî garisî ḧariẗek diçînit
Ev ḧariš e bo me dê hilînit

Ev ’adet e nîne xašê mîran
Nabînî li ber derê feqîran

Wan jî hemî pasiban ji šan in
Ew jî hemî qismê dergevan in!

Sul<u>t</u>anê serîrê bêniyaz î
Nabînî ji bo wî çaresazî

Hindî ewî rakirin sela<u>t</u>în
Deh çend ewî çêkirin şeya<u>t</u>în

Ḧašil di šeyê xwe mîr neborî
Te’lîl-i didane ber <u>d</u>erûrî

Mîran hene ew šeyêd-i tazî
Nadin bi ’edaleyêd-i tazî

Ew kînewerê xebîʿ û mudbir
Ye’nî Bekirê bi dil muzewwir

Xewfa wî hebû bi xef ji Tacdîn
Daim di dilê wî da hebû kîn

Weqtê ku bi dewlet û se’adet
Ev de’wet e bû bi resm û ’adet

Xef j`ademîyan wekî ’Ezazîl
Mehda xereda wî kidb û teswîl

Tenha wihe gote mîr di xef da:
Mîr im te Sitî qewî telef da!

Ew cewherê tac û tacê cewher
Ew efserê zîb û zîbê efser

Ew renge sezayê text û ewreng
Ferzane bi ’eql û ferr û ferheng

Kesra bi keser ji bo wê dînê
Fexfûr-i bi xewr-i bû evînê

Qeyšer ji kurê xwe ra bixwesta
Xaqan-i ji pêş ve dest bibesta

Hêja nedibû ewê tu erzan
Ev rengehe serserî bidey wan

Mîr go: Qe didem eya bedexter
Tacdîn û Memê bi text û Qeyšer

Roja weku bûye ceng û perxaş
Tacdîn û Memê du sed qizilbaş

(Bil-cumle) bi zirh û zend û binper
Înan ji me ra bi şîr û şeşper

Xaqan kî ye? Ez çi kem bi Feẍfûr?
Nadem ez ewan bi rub'ê me'mûr

Mel'ûnî ku dî nebû çu te˚sîr
Ew mes˚ele wergerande tezwîr

Go: Qenc e ḧeqîqeta humaman
Hemsengê šedaqeta ẍulaman

Roja vedixon şerabê belwa
Gava ku dixon kebabê selwa

Çawa ne di şahî û šefayê
Ew renge di tengî û cefayê

'ariḏ nebitin li wan tebeddul
Ẕahir nebitin ji wan teḧewwul

Mehḏa neken ev qušûrê xidmet
Qeṯ'a neken ew futûrê himmet

Ew ďewq û cefa bibin muqabil
Ew šidq û wefa bibin mu'adil

Lê dai' e himmeta kerîman
Der ḧeqqê nelaiq û le'îman

Nakes ne sezayê genc û mal e
Nûres ne munasibê celal e

Menzûreyê nûresan şerab e
Mexmûreyê serxweşan xerab e

Pur 'eqlî divêt û pur teḧemmul
Nûres bi meyê neket teḧewwul

Mîr im te nedî kurê Sikender
Dayê te nezer ji ḧeddî çû der

Roja ku Sitî te daye Tacdîn
Wî j`alê xwe daîye Memê Zîn

Mîr got: Çi 'eceb bi min nekir pirs
Ya ne qe nemaye, wî ji min tirs?

Go: Ma tu nizanî ew kusan e
Mîrza ye, ciwan e, pehlewan e

Meydan dîye wî cilew reva ye
Herçî weku ew biket rewa ye

Tirsa min ew e bi kibr û kînê
Ṯuẍyan biketin ji paşî Zînê

De'wa nesebê biket bi Xalid
Qešda ћesebê biket zewaid!

Mîr go: Me di dil hebû bi daxwaz
Zînê bi Memê bikem serefraz

Sûndê dixum ez bi rûћê walid
Ћetta bigehîte ceddê Xalid

Meћḏa bi ďukûrê neslê Adem
Zînê bi jinînî ez qe nadem

Herçî ji serê xwe bûye bêzar
Ha Zîn û bila bibit xerîdar

Mîrê ji ser û ruћa xwe têr e
Bê xewf-i bixwazitin ku mêr e

Ћukkam-i bi baṯin û bi ẕahir
Bê şubhe muşabih in bi agir

Ẕahir di šebaћî û binûr in
Baṯin ji medareyê di dûr in

Reḧmê ku diken ji rengê roj in
Qehrê ku diken, cihan disojin

Zinhar-i nekey bi wan tu bawer
Ger bab û pisî, weger birader

Xasma ku muqerrebêd-i bedxwah
Nêzîk-i bibin (ne'ûḋu-billah)!

## Naumêdîya Zînê ye ji dewleta wešlet û ḧesretê derdemendîya wê ye ji kurbeta furqet û ḧesretê

Tacdîn û Sitî ku bûn bi hev şad
Wešlê kirin, ew ji hecrê azad

Mem maye di kuncê weḧdetê ferd
Ne yar û ne hemnişîn, ne hemderd

Hemdem ku nebin ji bo deman ra
Hemderd ku nebin ji bo ẍeman ra

Ẍemgîn bi çi dê biken teḧemmul
Şahîn bi çi dê biken tewessul

Şahî û ẍeman divête enbaz
Derdan û deman divête demsaz

Unsiyyetê ’aşiqan sukûn e
Sermayeyê weḧşetê cunûn e

Asûde dibin bi yek du hemqal
Xasma ku hebin bi yek ve hemḧal

Zîn û Sitî û Memo û Tacdîn
Vêkra dikirin medar û teskîn

Zînê ku dikir ji derdî efẍan
Dengê Sitîyê dibûye derman

Gava weku Mem bi dil dinalî
Tacdîn dibûye ḧekîm li alî

Ev herdu ji her dûwan cuda bûn
Çûn herdu bi meqšeda xwe şa bûn

Man Zîn û Memê di bêserencam
Bêmeqšed û bêmurad û bêkam

Çil rojî ne xor ne xwab-i Zînê
Ser ranedibû ji ser girînê

Xûna dilî bû ẍiďa û xwarin
Hêstir bi xwe şerbet û vexwarin

Hemware bi roj eger bi şev bû
Wê ḧal-i ji furqetê her ev bû

Rojan digirî bi şev dikir ah
Ew reng gerîya ḏe’îf-i ew mah

Bedra rûyê wê bûye hilalek
Ṯel’et dinuma wekî xeyalek

Hemzad û heval û hemnişînan
Hemzar û emîn û nazenînan

Her leḧz̠e digotne wê bi riqqet:
Key serwê riyad̠ê baẍê rif’et

Sersebzî û tazeberg-i barî
Ev çende çi hêstiran dibarî

Hemşîre eger ji te cuda bû
Xweş çû û bi hemserê xwe şa bû

Wê girtiye bo xwe šebr û temkîn
Ew şa ye li wê tu lêre ẍemgîn

(Min be’d)-i ẍeman ji qelbî rake
Teşbîhî bi zulfê ber ve bake

Çîn çîn bike t̠ûrreyêd-i şebreng
Gul gul veke ’arid̠êd-i gulreng

Zulfan veke da bibin muselsel
Iklîlê li cebhetê mukellel

Biskan tu ji xumrîyan cuda ke
Zulfan şe ke pêkve ber hewa ke

Da sunbul û sorgul aşina bin
Reyḧan û binefşe ṯa bi ṯa bin

Biskan biwerîne ser hilalan
Sewda ke di bekkeyê bilalan

Dîsan bike xemrîyan qedeḧnoş
Ce’dan veke Ke’be bit siyehpoş

Ta xelq-i ji ẍerb û şerqê ta Şam
Ḧuccacišifet bibînin iḧram

Peywende ke pêkve bisk û xalan
Şîraze ke mušhefa cemalan

Serlewḧeyê dêm bibit muḋehheb
Ayatê Xudê bibin muretteb

Da firqeyê kafir û musilman
Tešdîq-i biken bi neššê Furqan

Van ẍemze û awirêd-i xûnxwar
Wan xencer û keyberêd-i dijwar

Zinhar-i medê cewazê ruxšet
Wan nîne bi kes çu rifq û reḧmet

Me°dûn bike ṯureyêd-i ṯerrar
Da ħukmî biken li şah û xundkar

Perdê tu ji ber gulan hilîne
Pê šebrîyê bulbulan bibîne

Xendan bike ẍunçeya dehanî
Nalan ke ħezar-i dasitanî

Serxweş ke li gerdenê guharan
Sersem ke cunûn û dîn û haran

Meyxwer ke melan bi ẍunc û nazan
Şeyxan bişihîne ber berazan

Destûr bide bisk û zulf û xalan
Agah-i bigêre ehlê ħalan

Da murşid-i bê l`ṯerîqê haim
Sergeşte binê wekî behaim

Inkar-i biket ḏelalê muṯleq
Iqrar-i biket bi šûretê Ħeq

Fariẍ ji tecellîya celalê
Qani' bi tešewira cemalê

Fanî biketin ewê wucûdê

Baqî bibitin bi vê şuhûdê

Ev çende ewan digotin ev pend

Zîn pê nedibû šebûr û xursend

Belkî bi nešîḧet û bi pendan

Yekcar dikete bela û bendan

’işq agir e, nefxe ye nešîhet

Sir perde ye, lewme ye fed̲îḧet

Hindî ku ewa dikir melamet

Wê zêde dibû ji wan nedamet

Eşkan nedidane çavî furšet

Ahan nedida dehanî muhlet

Da ev bi kelamekî xeber det

Ya ew bi meqamekî nez̲er det

Našiḧ fikirîn ku we’z̲ û teqrîr

Naken bi çu rengî nef’ û te°ïîr

Mayîn di te’ecucbê ku ew mah

Ev çende ji bo çira diket ah

Wan her we qiyas dikir ku Zînê
Her bo Sitîyê diket girînê

Dîtin ku xeber hemî hewa bûn
Naçar-i kirin sikût û rabûn

**Hemdemîya Zînê di gel ẍeman bi sebebê nifaq û nai’timadîya hemdeman**

Zîn ma bi tinê di gel ẍeman cot
Ẍem lê civîyan ji bo ẍeman got

Kay hemnefesêd-i bênewayan
Feryadiresêd-i pur cefayan

Hemderdê dilêd-i derdemendan
Hemperdeyê sirrê mustemendan

Hemrazê dilêd-i dilbirînan
Hemxwabeyê xaṯira ḧezînan

Hemkaseyê xwanê bê ṯe’aman
Hemmeşrebê raḧê telxikaman

’aşiq bi we wašilê cemal in
Salik bi we nailê celal in

Wêraneyê dil we maye xalî
Qeṯ ẍeyrî we kes nehin ḧewalî

Çawa dikirin ji bo xwe me’mûr
Muṯleq ji we ra me daye destûr

Dewlet bi we ye di darê dunya
Rif'et ji we ye serayê 'uqba

Ẍem lew me divên ku ba wefa ne
Nabên ev e teḧl û yan cefa ne

Roja reşîyan e yarê canî
Yarê xweşîyan e şadimanî

Kewnîn-i çi 'acil û çi acil
Ẍemxwarî nebit kû tête ḧaşil?

Ḧaşil bi we xweş dibit li min dil
Bê genc-i ẍeman ji dil çi ḧaşil

Geh gahê dikir Sitî muxaṯeb
Ev rengehe ew melek mu'ateb

## Mu'atebîya Zînê di gel Sitîyê gazinda ḧûrîyê ji perîyê

Kay rûḧ û rewanê qelbê Zînê
Nûra bešerêd-i yar û dînê

Hemşadî û hemcefa û hemdem
Hem leḧm-i û 'ezim û cild û hem dem

Hemşîre û hemcenaḧ û hemser
Hembeyde hemaşiyan û hemper

Wey teb'ê bi teb'ê min mutabiq
Illa ku bi bextî namuwafiq

Sed şukr-i te bext-i bûye yawer
Çawa te divê we da te dawer

Sed şukr-i te bext-i bû musa'id
Tali' gerîya ji bo te sa'id

Bextê min eger çi zêde reş hat
Ev qismet e bo me zêde xweş hat

Teqsîmê ẍeman ji bo mi ra bû
Teqdîrê ezel yeqîn wisa bû

Şahî ji te ra û Ẍem ji bo min
Tacdîn ji te ra û Mem ji bo min

Ẍem çunke li šûretê Memê ne
Lew ẍem ji me ra li ser ẍemê ne

**Mukalemeyê hemrazê şem'ê ye**
**mudawemeyê xûnrêzî dem'ê ye**

Dem şem'-i dikir ji bo xwe demsaz
Kay hemser û hemnişîn û hemraz

Herçend-i bi suhtinî wekî min
Emma ne bi guhtinî wekî min

Ger şubhetî min te jî biguhta
Dê min bi xwe dil qewî bisuhta

Derdê min û te ji yek bi ferq e
Ew ferq e ji ẍerbê ta bi şerq e

Meşriq tu yî agirê te ẕahir
Meẍrib ez û baṯinê min agir

Daim disujit me rişteyê can
Te nasujitin bi ẍeyrî ezman

Pêht min li serî di dil pereng e
Canê me di gel perengê ceng e

Şewqek te li ser serî dîyar e
Sewdayeke serserî dîyar e

Ew şewq-i ji bo te ra zeban e
Ev pêht-i ji bo mi ra ziyan e

Pêhta ji dilê me dayî ser ser
Ḧukmî diketin li bayê šeršer

Herçend-i bi şev dimînî bîdar
Šubḧan dinivî ḧeta ve êvar

Êvar û seḧer bi roj eger şev
Ez her disujim wisa li ser hev

Geh gah-i ji dest dilê birîndar
Naçar-i dibû ji canî bêzar

**Bulbulîya Zînê ye di gel perwaneyê**
**perwanîya wê ye di gel dîwaneyê**

Perwa nedikir bi ateşê ẍem
Perwane dikir ji bo xwe hemdem

Key ṯairê aşiyanê firqet
Wey bulbulê bositanê ḧirqet

Ey ḧuccetê 'aşiqêd-i šaib
Wey mubṯilê mudde'îyê kaḋib

Merdane dibexşî canî erzan
Ḧeyfa ku bimir giranî lerzan

Nawestî demek li ber hewayê
Napuxte ṯeleb dikey fenayê

Ew lez ji te ra gelek qušûr e
Ew lerz e ji bo te ra futûr e

Bê šebrî û bê sikûn û bê tab
Lewra xwe dikey bi zûyî purtab

Napuxteyê 'eybeke temam e
Meṯbûx-i dibêjinê ku xam e

Puxte disujin meger çu caran
Fanî qe dibin bi nûr û naran

Baqî digerin wekî semender
Wan cisim-i dibîte canê enwer

Yek ďerre ji asiman û ’erdan
Nedma ku neket di gel xeberdan

Wê cismimunewwera melekrûḧ
Beyḏa, qemera muqabelet yûḧ

J`ev ademîyêd-i šaḧibex̆raḏ
Meḧḏa dikir iḧtiraz û i’raḏ

Fikra xwe dikir ji ins û canan
Sirra xwe digote bêzebanan

Ser ta bi qedem x̆erîqê x̆em bû
Neqşê dil û can xeyalê Mem bû

**Mecnûnîya Memê ye ji ’işqa Leylayê**
**Wamiqîya wî ye ji derdê ’Eđarîyê**

Mem jî ji xeyalê rûyê dildar
Ye’nî ku ji arezûyê dîdar

Bû dînekê dilpeđîr û sewda
Mecnûnekê bênez̲îr û şeyda

Ẍalib gerîya li ’eqlî dehşet
Mu˚nis gerîya li qelbî weḧşet

Ne qabilê ḧemlê daẍ û derdan
Ne nailê seyr û baẍê werdan

Ḧašil ku nebû wišalê Zînê
Raḧet çu nebû ji ber birînê

Lewra ku du teşneleb di bêgav
Bêtab-i bibin ji bo firek av

Nageh birjit ji asimanî
Serçeşmeyê abê zindeganî

Yek teşne muradê dil helînit
Yek sûxite her wisa bimînit

Yek kesbê biket ḧeyatê sermed
Ê dî diçite mematê mumted

Tacdîn-i ku ew wišal-i dest da
Ew reng li Memê melal-i dest da

Ešla ji ẍeman nebû muwasa
Meḧḏa bi kesan nebû mudara

Qet'a wî nebû li cih qerarek
Ešla wî nebû bi kes medarek

Ew weqtê wekû diçûye pêş mîr
Te d`go ku dusax e pê di zincîr

Her leḧẕe ji derd û ah û wahê
Agir digihande baregahê

Gava ku diçûye pêşî Tacdîn
Ew jar e di gel dilê binalîn

Ned`şê biketin medar û šuḧbet
Ned`bû bigirt qerar û ulfet

Naçar-i ji hêşetê diçû dûr
Hemderd-i dibû di gel şeṯê kûr

**Muxaṯebeya Memê ye di gel Şeṯê Cizîrê**
**mucawebeya ji 'işqa bênez̲îrê**

Kay şubhetî eşkê min rewan e
Bê šebr û sikûnê 'aşiqan e

Bê šebr û qerar û bê sukûn î
Yan şubhetî min tu jî cunûn î

Qeṯ nîne ji bo te ra qerarek
Ẍalib di dilê te dane yarek

Her lehz̲e te jê çi têṯe bîrê
Sergeşte dibey li rex Cizîrê

Ev şehre ye, ger ji bo te meḧbûb
Ḧašil gerîyaye bo te meṯlûb

Daim di dilê te da ye menzil
Destê te li gerdenê ḧemail

Hêja ji Xudê tu fikrê nakey
Her roj-i ḧezar-i şukrê nakey

Ev çende dikey hewar û gazî
Êdî çi muradekê dixwazî

Bêhûde çira dikey tu feryad
Aware diçî diyarê Beẍdad

Ger ez bigirîm û ger binalim
Wer ez bimrim û ger bikalim

Herçî weku ez bikim rewa ye
Me’qûl-i ji bo mi ra fena ye

Carek li dilê mi jî guḋer ke
Serçeşmeyê çeşmê min neẕer ke

Derdê dilê min ku bêdewa ye
Çeşmê terê min çi macera ye

Dîwane me, min perî bi der da
Ez Dicle me zenberî me berda

Weštanî û Nêrgizî û Seqlan
Derwaze û ’Ummerî û Meydan

Van seyrigehan tu lê dikey geşt
Ez mame ji bo mirad-i rûdeşt

**Mebaḧiẗîya Memê di gel bayî**
**hewadarîya di gel hewayî**

Geh behẗ-i dikir di gel šebayî
Şerḧa ẍemê dil digote bayî

Kay cismê leṯîfê şubhetî rûḧ
Dergahê beden li ber te meftûḧ

Ez hîvî dikem ku bê teweqquf
Rencîdeqedem bi bê tekelluf

Carek here (suddetul-se’adet)
Gavek here (sudretul-nihayet)

Ewwel tu bibose asitanê
Paşî here pêşî dilsitanê

Emma bi tewaḏu’ û bi te’ẕîm
Sed mertebe iḧtiram û tekrîm

Aheste ji bo bike du’ayê
Dabesteyê wê bike ïenayê

Şayeste bike tu iḧtiramê
Destbest e vewest bike selamê

Paşî ȟereket ke pêş ve çapik
T̈iqlet nekirî li t̲eb'ê nazik

Ev name ku xûnê dil midad e
Ew šefȟe ku merdumek sewad e

Perdê melivîn ji ber cemalê
Tenha bide destî 'erd̲iȟalê

Zinhar-i deba nekey niqabê
Gava ku dixonitin kitabê

Bêjê ji mi da ku padişah im
Xala enîya te qiblegah im

Lew met̲le'ê nûrê (Ḋul-celal) î
Lew menbe'ê Kewẗera zelal î

Lew menz̲erê mez̲hera Îlahî
Em bo te geda tu padişah î

Da bo me bi ȟeqqî muttešif bî
Der ȟeqqê me 'edl û muntešif bî

Der dîde ji dîdeyê tewella
Geh gahî bikey li dil tecella

Ew de'bê qedîm e padişahan
Wan 'amenez̲er li purgunahan

Wellah gunehê xwe ez nizanim
Emma me dilek hebû dizanim

Ew dil perîyan ji min revaye
Ev pêlek e ew ji min cuda ye

Weqtê ku di gel min ew teba bû
Şaḧibhewes û xudanhewa bû

Belke kiribit xet̲a û 'işyan
Insan xuliqîne b`neqş û nisyan

Sed car-i ku zêde purgunah e
Lê sayeyê zulfê te penah e

Ger qehrê bikey li wî ceza ye
Wer 'efwê bikey 'eceb 'et̲a ye

Ev renge bibêje ey şebatîz
(Wangah-i zemîn bibos û berxîz)

Ey badê şeba bi ḧeqqê Me'bûd
Gava weku têy ji pêşî meqşûd

Zinhar-i hinek ji xakê dergah
Bîne ji me ra di gel xwe hemrah

Toza ku ji rengê tûtîya ye
Bîne bi xwe ra ku kîmiya ye

## Mucadeleya Memê ye bi dilê kul ra muḧarebeya perwaneyê bi bulbul ra

Geh ceng-i dikir di gel dilê jar:
Kay xainê şermisar û ẍeddar

Kan qewl û qerar û ’ehd û peywend
Peyman û qesem, yemîn û sogend

Te d`go ku di gel te šadiq im ez
Te d`go bi te ra muwafiq im ez

Te d`go ku di gel te yekdil im ez
Te d`go ku xudanteḧemmul im ez

Ḧeyf e ku ziyade bêwefa yî
Weyla ku ne qabilê cefa yî

Qelbê deẍelî bi dil ne yar î
Pur çîl û çep î, xerab û xwar î

Ey ṯûṯîyê perweriş şirîn î
Wey ṯiflê ṯufeylê nazenîn î

Yarê xweşîyan bûyî meger tu
Qelsê reşîyan bûyî meger tu

Dilhayê kesan derûnî tenha
Inšafe tinê bihêlî tenha?

Ev bulbulê can di meȟbesa ten
Maye bi tenê miŧalê bîjen

Inšafe bikey tu can î bidrûd
Drewazeyê ten bigêrî mesdûd

Sirra di te da ji feyḏê can e
Nûra di zemîn ji asiman e

Ey dil meçe bê çiraẍê canî
Ẕulmat e tu korê rênezan î!

Meqšûd-i eger ji bo te canan
Canan te di canî dane punhan

Lewra tu nimûnedarê đat î
Ayîneyê šûretê šifat î

Zinhar-i meçe li dû tewella
Da can neketin ji te teberra

Çûna te dibîte xariciyet
Terka te dibîte rafiḏiyet

Xaric mebe da bibî tu daxil
Terkê meke da bibî tu wašil

Refḏê meke tû bi dil be sunnî
(Ma baluke weyȟek ente minnî)

T̈abit be ku da ne naxelef bî
Da waqifê sirra (men-’eref) bî

Herçende tu çûyî ber derê dost
Lê dost-i li nik min e li wî post

Qedda te ȟebandî bo te dar e
Zulfa te çivandî ew qinar e!

Ceďba tu revayî can li bal e
Sirra tu fidayî ew xwemal e

Bawer te neyê li zulf û xalan
Malî mede hindûyan bi talan

Pabende mebe bi tarê gîsû
Sergeşte mebe bi qewesê ebrû

Herçende xelîl î ey belakeş
Gulzar-i li te dibîte ateş

Teşbîhî te sed ḧezar-i bulbul
Sed car-i biken fiẍan û ẍulẍul

Perwanešifet li pêşî werdan
Her dem disujim bi daẍ û derdan

Ey dil te xwe daye ber hewayî
Qešda te ew e bikey šefayî

Emma ji t̠ebîbê 'işqê šadiq
Min zanîye bo te ra muwafiq

Perhîz-i ji qismê muştehatan
Teqwa ye ji van muleďďeďatan

Herçî ku muxalifê hewa ye
'eynê wî ji bo te ra şifa ye

Min pursîye bê guman ji Luqman
Xaššiyetê şerbetan û luqman

Herçî ku şirîn e 'eynê daye
Herçî weku t̠eḧl e ew dewa ye

Ew çende ewî di gel dilî got
Naçar-i dilê dilî bi wî sot

Dûkel ji ħerareta suweyda
Rabû tijî bû meħell û sewda

Rabûve ji dil duxan û yeħmûm
Reş kir li serî dimaẍ û xeyşûm

Neynîkê xeyalê bû mukedder
Ayîneyê 'eqlî bû muẍebber

'ewrek te digo ji erḏî rabû
Evrazî li asiman cema bû

Wî 'ewrî ji nîveka hinavan
Xûnbarî dikir bi herdu çavan

Seyla cigerê wisa li gur hat
Goya ku bi ser Erez ve Kur hat

(El-qišše) ji 'illeta di dil da
Seylek we diçû Memê bi mil da

(Şeṯṯul-'ereb) û Firat û Ceyħûn
Hersê te digo ku pêkve rabûn

Herçende ji hêstirê Memê jar
Şîn bûn li rexê şeṯî sipîdar!

Šeḧra hemî bûne šeḧn û bustan
Saḧil bûye gulşen û gulistan

Wî bêdilî her li wê mekan girt
Wî bulbulî bo xwe aşiyan girt

Ew bulbul eger çi pur hewes bû
Zindanê beden li wî qefes bû

Vêkra werîyan li wî per û bal
Têkda weşîyan ji wî xeṯ û xal

Qedda wî ye şubhetî šenewber
Xem bû civîya miẗalê ’er’er

Rûyêd-i wî gerçi her di ter bûn
Manendê xuzamê lêk-i zer bûn

’ariḏ qewimî li neynikê jeng
Rewneq çu nema li neqşê erjeng

’işqê we nexweş kir ew belakeş
Ḧubbê we teles kir ew muşewweş

Dêma wî nema çu ab û rengek
Nuṯqa wî nema cewab û dengek

J`ewwel ve li rex şeṯî nexweş ket
Çil rojî temamî şubhî leş ket

’eql û xired û şu’ûrê insan
Ḧiss û ḧereket qiwayê ḧeywan

Qeṯ’a qe nema ji wan çu aẗar
Yek cuz˚-i li nik Memê birîndar

**Çûna mîr Zêndîn e bi šeyd û nêçîrê**
**azadîya Mem û Zîn e ji qeyd û zincîrê**

Šeyyadê şikarê ĥusnê exbar
Kir bo me ku sergudeşt-i izhar

Go: Rojeke xweş bi fešl û eyyam
Dewra feleka fena serencam

Meşşatešifet cehane dêrîn
Tezyîn kiribû 'erûs-i ayîn

Ferraşê qeda bi šun'ê qudret
Ẍebra kiribû mitalê cennet

Her yek ji newal û koh û deştan
Reh şubhetî gewşeyêd bihiştan

Her rewde riyadê xuldê ekber
Her çeşme ji 'eynê abê Kewter

Her koh-i ji rengê Ţûrê Mûsa
J`enwarê tecellîyê teyîsa

Her nehre ji rengê ejdeha bûn
Her sebze bi mu'cizan 'eša bûn

Her dar-i ji feyḏê newbeharî
Têk şu'le dida ji nûrê Barî

Her gul ji mis̈alê ateşê Ṯûr
Yek meş'elê bêqušûrê purnûr

Her murx̆isehër bi xwe kelîmek
Her ṯûṯî û qumrî yek nedîmek

Her nexlê nida kunende her gah
Teşbîhî şecer digo: (Enel-lah)

Xergûş û x̆ezal û gor û ahû
Ev qaz û quling û kebk û teyhû

Ker ker diçerîn li koh û deştan
Ref ref difirîn di nêv bihiştan

(El-qišše) bi iqtiḏay zemanî
Bû furšetê 'eyş û kameranî

Fešla bigerin li geşt û seyran
Nêçîrê biken ji wehïş û ṯeyran

Mîrê ku felek muṯî'ê ferman
Go: Šubḧe nebûye qewmê Buhtan

Rabestî silaḧ û gurz û şemşîr
(Bil-cumle) di gel me bêne nêçîr

Ḧadir nebitin kesek di šeydê
Ew dê bimirit di bend û qeydê

Xelqê ku ḧeta bi šubḧê kad̄ib
Ḧadir kiribûn bisat̲ û ratib

Fecrê ku nemaye wan 'elamet
Rabû di wî şehrî da qiyamet

Mîran vekirin 'uqab û bazî
Şêran dibirin piling û tazî

Derrinde û adem û behaim
Ferdek qe nema di şehrî qaim

Ḍam û ded û ademî û ḧeywan
Ṯifl û šebî, aşevan û rezvan

(El-qišše) qebîleya ricalan
(Fil-cumle) kesek nema di malan

Bû ḧeşrigehek li šeydigahan
Şefqet nekirin li bêgunahan

Ew çende ji weḧşîyan dikuştin
Goya ku wiḧûş-i qeṯ nehiştin

Derrinde, dewinde û perende
Hin kuştin di girtî hin fikende

Çapuk ḧerekat û newciwanan
Wan faris û kurd û pehlewanan

Durrende dirandibûn bi şîran
Perrinde birandibûn bi tîran

Meḧbûb-i miẗalê şehlewendan
Merkeb ’ereban xudan kemendan

Çogan-i di dest di gel gopalan
Havêtine gerdenêd ẍezalan

Ew şêresiwar û bebr û cengî
Xûnî kiribûn belekpilingî

Ew çende ẍezal ewan kirin šeyd
Ew çende piling ewan kirin qeyd

Êdî nedişên di gel xwe bînin
Belkî nedişên ji cih helînin

Kuştî ji xwe ra birin feqîran

Girtî bi xwe ra birin emîran

**Dastanê bustanê cennet nişanê mîran e**
**ku bûye (mecme’ul-beḧreyn)a ’işqa herdu dilfikaran**
**(meṯle’ul-neyyireyn)a şewqa ḧusna herdu gul’uđaran**

Baẍek we hebû emîr Zeyindîn
Baẍê Îremê diçû bi mizgîn

Her dewḧe ji wî û her ṯuyûrek
Yek qešr e ji cennetê û ḧûrek

Bo şuştinê dest û pê û đihqan
Kewẗer gerîya sebîlê Riḏwan

Hemser bi meqamê Sidre serwek
Manendî firişte her teđerwek

Teşbîhî Memê dilê šenewber
Sed pare ciger ji ’işqê ’er’er

Narinc û turincê şubhî Zînê
Zer bûye ji ’illeta evînê

Sêv û ruṯeb û enarê bustan
Lêv û đeqen û enarê pustan

Şimşad û çinar-i hemqedem bûn
Xweş sayewer û ’elîhimem bûn

Zerrînqedeḧêd-i mestê lebrîz
Reyḧan û binefşe cumle şebxîz

Mecmû’eyê xeḏrewat û ezhar
Şîrazeyê selsebîl û enhar

Šeḧna rezî mucmela kitabek
Her qeṯ’e û fešle fešl û babek

Goya bi edeb edîbê tencîm
Seršefḧeyê baẍî şubhî teqwîm

Cedwel kirbû bi Ḧellê sîmab
Şengerfišifet gulêd-i sîrab

Eṯraf-i ji sunbul û reyaḧîn
Elwan ji xuṯûṯê sebz û mişkîn

Her yek dikirin beyanê eḧkam
Bextê siyeh û sifîd-i e’lam

**Rehaiya Zînê ye ji qeyda te’elluqa ex̆yaran tenha û tekelluma wê ye di gel belg û daran**

Ew ahûyê šeydigahê weḧşet
Ew banûyê barigahê ulfet

Serkelle x̆ezalê deştê derdan
Sergeşte nihalê bax̆ û werdan

Pabesteyê qeydê ’işqê xûnxwar
Šeyda ku Memo kirî birîndar

Dî şehr û meḧelle cumle xalî
Xalî bûye kûçe û ḧewalî

Tenha û tehîne, bax̆ û bustan
Bê ins û perî ne šeḧn û eywan

Zanî ku zeman e bêeman e
Go: Rabe dilo! ’eceb zeman e!

Furšet xweş e da biçîne seyran
Da seyr bikeyin li weḧş û t̲eyran

Kanê qe hebin ji wa, me hemderd
Lewra ku ev ademî ne, bêderd

Ṯeyrek me bihîstiye di baẍan
Bextê wî reş e ji rengê zaẍan

Lê jar û ḏe'îf û bêmecal e
Aşufteyê rûyê werdê al e

Rojan diketin fiẍan û zarî
Xûna xwe dixot şevêd-i tarî

Daim diketin fiẍan û ẍulẍul
Hevdengê min e bi navê bulbul

Hemderdekî qenc e ehlê ḧal e
Dermanekê derdê min li bal e

Ey dil were da biçîn nihanî
Hêja ku heye me zindeganî

Belke bi nešîḧet û bi pendê
Aza me biket ji qeyd û bendê

Ev rengehe got û bê teweqquf
Zîn hate vî baẍî bê tekelluf

Agah-i nebûn ji wê çu deyyar
Ney daye, ne xadim û peristar

Meqŝûd-i ewê ne ’işretek bû
Wê meḧḏ-i muradê ’izletek bû

Lew hate vî baẍî ew perîzad
Da têr-i biket ji dest ẍeman dad

Her lale li sîne bûne daẍek
Her ẍunçe bi suhtinê çiraẍek

Her dar-i li cismî bûne barek
Gulnar-i li qelbî bûne narek

Tenha ku xwe dî berek di des bû
Ew seng-i zebaneyê ceres bû

Dem dem we dida li deffê mermer
Bê şubhe dilê beran dibû ker

Gava ku neẕer dikir li avan
Xûnab-i diçû ji herdu çavan

Şeḧna rûyî bû hewayê bulbul
Şadab-i dikir bi abê gulgul

Qedda ku bi rasitî şenewber
Dêma bi ḏiyayê mihrê enwer

Ew reng-i dida li ax û ’erdê
Ew çende disû di toz û gerdê

Axê dikir ax û ber dinalîn!
Daran dikir ah û belg dikalîn!

Her dem ku dikir ji derd-i (ya hû)
Mir°at û felek dikir siyehrû

Pejmurde kirin bi rengê sorgul
Efsurde kirin bi dengê bulbul

Bulbul nedişên bibine hevdeng
Sorgul nedişên bibine hevreng

Hindî ku di baẍî da neẕer kir
Beḧ̈ta xwe di gel gulêd-i zer kir

Kay şubhetî ’aşiqan di gergûn
Wey şubhetî min ji zêr û zergûn

Bergêd-i we sed newa hezar in
Hûn bo çi zer in, ḏe’îf û jar in?

Yan şubhetî min di bê Mem in hûn?
Lewra weku min di pur ẍem in hûn!

Bulbul bi gulêd-i sor e meşẍûl
Hûn mayîne şubhê min di me’zûl

Lewra di ’elîl û derdinak in
Lewra di ȟezîn û sîneçak in

Hûn qenc-i ji bo me ra delîl in
Hûn bo me di ȟalî da ’edîl in

Xuşkek me bebû ji rengê sorgul
Hilgirtiye wê ji bo xwe bulbul

Ha hiştiye bo me ’endelîbek
Meȟrûm û sefîl û bênešîbek

Ez jî ji đelîlî û bênešîbî
Zer bûme ji hecrê ’endelîbî

Dêma min e sor e erẍewanî
Zer bûye wekî we ze’feranî

Carek bidya min ew bi dilxwah
Êdî nedikir min ah-i bil-lah!

**Teqadayê da'iyeyê dîdarê dildar û mulaqat e ji bo Memê jar ji cenabê (wahibul-meram) û (qadî elhacat)**

Herçî bibitin ji xeyr eger şer
Bê da'iye nabitin muyesser

Ger wešle û ger qumaş û dîdar
Bê da'iye nabitin çu bazar

Ew da'iye cumle ehlê hal in
Belkî ji cenabê (Ďul-celal) in

Qelbê te dibêjitin ku rabe
Ev sa'ete 'eynî fethê bab e

Ew koh û weqar û behrê mewzûn
'işqê kiribû xefîf û mecnûn

Ye'nî ku Memê merîd û bedhal
De'fê kiribû ziyade pamal

Roja ku ji şehrî xel bi der ket
Sewdayê xiyalê Zîn bi ser ket

Bîmarê bi derdê 'işqê sekran
Bê nedcê mered gihişte buhran

Bû qelqeleyek di qelbê xemgîn
Esla nedibû di xanî teskîn

Naçar-i ji xanî ew bi der ket
Ew da'iye Xidr-i bû bi ber ket

Ew Xidr-i çi bû? Teşewwuqa dil
Ew şewq-i çi bû? Te'eşşuqa dil

Qelbê wî di gel wî bûye baxî
Kêşan û keşan gihande baxî

Zîna ku şevêd-i reş di tarî
Her dem bi fixan û ah û zarî

Daim ji Xudê dikir temenna
Mem rabit û bête nik bi tenha

Nageh fikirî ku Mem ji der hat
Bîmarê Mesîh-i dî bi ser hat

Zînê ji evîn û şadimanî
(Fil-hal)-i nema çu zindeganî

Bê hiş kete ser çîmen wekî gul
Sed pare ceger ji 'işqê bulbul

Mem hat û teferruca gulan kir
Seyrek li riḧan û sunbulan kir

Go: Ey gul eger tu nazenîn î
Kengî tu ji rengê rûyê Zîn î

Ey sunbul eger heyî tu xweş bû
Reyḧan ji te bûyine siyehrû

Hûn ne ji miṯalê zulfê yar in
Hûn herdu fuḏûl û herzekar in

Ey bulbul eger tu ehlê ḧal î
Perwaneyê şem'ê werdê al î

Zîna me ji cewçema te geştir
Bextê me ji ṯali'ê te reştir

Bulbul ez im ey nîk û serencam
Bîhûd e çira dikey xwe bednam?

Gul yek, ne tenê ku sed hezaran
Gulşen diditin di newbeharan

Me'şûq e ku miṯlê wan gelek bin
Herçende ku ḧûrî û melek bin

Ew nabine mûcibê çu derdan
Lewra ku hebin li cumle ’erdan

Yek bît û nebit miẗal û hemta
Mestûr e ji rengê Zîn û ’enqa

’aşiq bi çi dê biket midare
Bê šebr û mirin ewî çi çare

Ev renge digo ji ḧalê ẍafil
Nageh fikirî ku pêş muqabil

Zîna ku du sed perî peristar
Ḧûra ku Memo ji bo giriftar

Wê sebzešifet li ser zemînê
Bêhiş kirî darûwê evînê

Zîna ku şebîhî durrê meknûn
(Fil-ḧal)-i ku dî Memê cegerxûn

Bêhiş kete ber piyan û bêgav
Serwê ku gehişte ber piyan av

Ẍunçe ji xewa seḧer ve bişkuft
Wê bûyî bi bulbulê xwe ra cuft

Go: Ev xew e yan nexud xiyal e
Ev xewn e šeḧîḧ e ya beṯal e?

Ḧašil ku ji paşî sed xiyalan
Xašiyetê bûyî zulf û xalan

Zînê ku gihande ber meşamê
Šeydê mirî zînde kir bi damê

Rabû ku li pêşî destê Zînê
Fikrî ku du dest di destê Zînê

Man herdu gelek li pêş-i yek lal
Ne nuṯq û xeber, ne qîl û ne qal

Ewwel dikirin bi dest işaret
Paşî ku vebû li wan ’ibaret

Ew çende kelam-i pêkve gotin
Ew çende ji pêşî pêkve sotin

Ew çende qedeḧ bi yek ve rêtin
Ew çende lebê di yek dimêtin

Ew çende şeker bi yek ve xwarin
Ew çende qeḏa ji nû bijarin

Çeşm û leb û sîne, gerden û dûş
Ruxsar û d̈eqen, ber û binagûş

Yek yek bi dilî ji yek dixwestin
Hin bose didan û hin digestin

Ew teşnelebêd ji wešlê yek têhn
Gerden dikirin li yêk û du bêhn

Zîna ku bi rux miẗalê şem'an
Pur şewq û ḏiya û nûr û lem'an

Perwanešifet Memê bi ẕahir
Cismê xwe û can didane agir

Geh geş dibû agirê evînê
Perwane dima ji boyî Zînê

Herdû di wî ḧalî da 'eyanî
Bê perdesera û bê niwanî

Wan dîte di baẍî da serayek
Ayîneyê cem cehan numayek

Rabûn û meşîne şehnişînan
Rûniştin û herdu nazenînan

Hicran dikirin ji ser şikayet
Wicdan dikirin ji nûr û ayet

Dem ebrišifet ȟezîn û giryan
Geh x̆unçe meṫel leṯîf û xendan

Her dem dikirin qeḏa û sunnet
Ferḏa weku bose ne çi minnet!

Herçend-i ku ref'-i bûn tekelluf
Lêkin êvişandibûn tešerruf

Ew gerçi hebûn ji hev bi hîvî
Emma nediçûn qewî nişîvî!

Ȟubba di dilan ji ȟeddî der bû
Serȟeddê ẕerafetan kemer bû

'işqa ku ji ser ȟedî kemal e
Ava ku ji menbe'ê zelal e

Elbette xwe dê biket ȟiraset
Naket çu qebûlîya necaset

Ciwanî û bihar û bax̆ û meȟbûb
Aya di dinê çi maye meṯlûb?

Xasma hebitin evînî ẍalib
Lebteşneyê ’işqê her du canib

Êdî çi bibêjim ez nizanim?
(Bilmez ki ne söyle) ye ziban im

### Vegeryana mîrê mîran e ji şikarê
### bi serxweşîya Memê û Zîna di 'eynîya dîdarê
### bi nêçîrê wan e ji ser da hatina mîrê mîran e di weqtê êvarê

Saqî me bigir ku ez bi dest im
Mexmûr im û meynexwarê mest im

Gava ku vexwar Memê û Zînê
Axifte li min cihê birînê

Em 'aşiq eger çi meyperest in
Emma ji meya (elest)ê mest in

Ew mey ne wekî meya te al e
Ew mey ji cemalê (Ḋul-celal) e

Ew ḧubbê ḧebîbê pakiḋat e
Qunwanê ḧedîqeyê šifat e

Saqî bide min ji bo Xudê ra
Camek ji meya te duh digêra

Her cur'eyekê e jê bikem tam
Yek teşne bes e ḧeta serencam

Ew keyfeke meḧḏ e bê kem û keyf
Esrarek e bêxeyal û bêṯeyf

Da def'-i bikem xumarê dûşîn
Hişyar-i bibim ji xwabê nûşîn

Da şubhî Memê nebit ku ẍafil
Bêt mîrê ecel bi ser me 'acil

Roja min e 'umrê çûye êvar
Hêja nebûm ez ji xwe xeberdar

Zîna hewesa dilê hewayî
Min danîye nêv xwe û 'ebayî

Mîr hate li ser wî hinde 'esker
Zurna û nefîr û kûs û meyter

Dadayî li ṯebl û xan û sazan
Çawîş û šeda û gazegazan

Pabendê bi 'işqê herdu ceyran
Dermande ji pêşî yek ve ḧeyran

Qeṯ seh nekirin ku ev çi reng e
Qeṯ guh nekirin ku ev çi deng e

Mîr go ku veken evan ẍezalan
Pabend-i meken ewan şepalan

Têk berdine bax̃î wan wekî t̲eyr
Da em bikerîn hero li wan seyr

Xelqê ku x̃ezal û gûr û xergûş
Xweş girtî li ser mil û derax̃ûş

Anîn hemî mîr tijî di rez kir
Ax̃ul ku şivan tijî ji pez kir

Mîr gote ekabir û xewašan
Tenbîh-i biken nedîm û nasan

Da çîn û demek di bax̃î rûnîn
Lewra ku ji reḧtîyan zebûn în

Ew hatine der serayê ’alî
Dîtin der û ban hemî di xalî

Emma ku derîçe têk guşadin
Reng qur’eyê texteyê murad in

Had̲ir kete qelbê wî xiyalek
Zanî ku ne xalî ye ji ḧalek

Mîrê bi weqar û ’eql û ferheng
Tacdîn û Bekir xwe dane ber çeng

Înane sera ku Zîn û Mem tê
Guh dane šeda ku zîr û bem tê

Mîr hat û bi ser ve dî Memê jar
Paldayî ye balgeyêd-i zertar

Kêşaye serê xwe wî ’ebayek
Êvar û ne şem’ û ne çirayek

Mîr go: Kî ye ev di vî zemanî
Bê ruxšetê min di vî mekanî?

Zînê ku bihîste dengê nasî
(Fil-ḧal)-i xwe daye bin libasî

Mem qet̲ ji cihê xwe ranebû, got:
Šeyda te li min dil û ceger šot

Mîr im te dizanî ez nexweş bûm
Ḧetta ve duhî qewî neheş bûm

Îro me bihîst ku xel di gel mîr
Têkda bi tebayî çûne nêçîr

Šebra me nema di nav nivînan
Rabûme di gel evan birînan

Naçar-i bi der ketim ji xanî
Nageh me xwe dî li vî mekanî

Mîr go: Nexweşan nehin ji bo qeyd
Barî te di baẍî da çi kir šeyd?

Go: Ez ku bibêm bike tu bawer
Dawer bi mi ra ku bûye yawer

Min dî di vî baẍî da ẍezalek
Emma ku ẍezal nebû şepalek

Ahûyek sipî û çav di reş bûn
Biskên di siyah û bihn di xweş bûn

Her leḧẕe ji nafeyê tetarî
Sed bar-i ji ṯûrreyan dibarî

Šeḧrayê Xuten tijî bitin misk
Yek ṯayê ji zulfê wê û yek bisk

Herçende sipî û çavbelek bû
Emma bi qiyasê min melek bû

Lewra ku tu hatî ew nihan bû
Hindî tu nehatî ew 'eyan bû

Tacdîn ji tekelluma wî zanî
Zîn hatiye ba Memê nihanî

Go: Guh medine Memê ku dîn e
Malxolî ye wî ’eqil çu nîne!

I’raḏ-i kirin ji wî kelamî
E’yan hemî vêk ketin temamî

Saqî û şerab û şem’-i xwestin
Dîwaneke ḧakimane bestin

**Rabûna Tacdîn e ji dîwanê di wê demê da**
**suhtina milkane di rêya Memê da**

Tacdîn fikirî ku bezm-i boş e
Pur ďewq û šefa û 'eyş-i noş e

Mem zêde bi xušše û melal e
Çû bal ve û go: Bira çi ḧal e?

Emma bi işaret û mu'emma
Pursî û Memê bi remz û îma

Destê xwe ji hoçikê 'ebayî
Kêşa û 'ecaibek numayî

Dîtin du kezî ji miskê tatar
Manendê du ser bi mehre şehmar

Gerdaye di paşila Memê da
Mem maye di heybet û ẍemê da

Zanî ku qewî xerab e eḧwal
Rabû bi lez û bezî û çû mal

Nageh bi xeḏeb ku çû ji derda
Zanî Sitîyê di gel xeber da

Gotê: Te çi ḧal e ey tehemten
Te’cîl-i çi ye, kî ye te duşmen?

Go: Rabe Sitî ku min dereng e
Îro me di gel vê malê çeng e

Ṯiflê xwe xelaš ke dê biçit mal
Mal bo min û ha ji bo te mendal

Sermayeyê ’umrê zindeganî
Ye’nî Mem û Zîn bi dilgiranî

Mayîne di werṯeya belayê
Min qešd e ku ez bikem rehayê

Xel vedkujit agirî bi avê
Ez dê vekujim bi agir avê

Mala xwe ji rengê qewmê Zerdeşt
Da agir û gazîya xwe raheşt

Agir ku digirte xan û manan
Wî girte bi gazî û fiẍanan

Eqwam û qebail û ’eşair
(Bil-cumle) bezîne def’ê agir

Agah-i ku bûn emîr û xilman
Xalî kirin ew sera û bustan

Ew jî ku bezîne wê hewarê
Wî muttehemî we gote yarê:

Tacdînî te dî çi rengeda kir
Mûsa li me behrê xem ziwa kir

Rabe tu here heremserayê
Da ez çime agir û nidayê

Zîn rabû we çûye xelweta xas
Tacdînî nema ne cil ne palas

Esbab û tecemmul û defîne
Emlak û cewahir û xezîne

Cumle di riya birayî sotin
Lew nav-i bi qencî tête gotin

Malî mehebîn te ey nikûnam
Hubba wî diket mirovî bednam

Zinhar! Tu mebe li malî harit
Lewra ku diben ji dest te warit

Cem'a wî ji bo te barê zeḧmet
Terka wî ji bo te narê ḧesret

Roja biçî pêş-i destê Barî
Destê te ji genc û malî 'arî

Ev cennet û ev qumaşê dîdar
Ey muflisê axiret xerîdar

Kengî ji te ra dibin muyesser
Dê bêne te: Mifliso! Here der!

Reh şubhetî vê cehanê fanî
Mift nade te parîyek ji nanî

Malî mede wariẗan tu meccan
Ger dê te bivê hesayîya can

Hêja ku xweşî telef bike mal
(Bil-cumle) bide bi ḧusnê e'mal

Wariẗ ji te ra kefen behayî
Ḧetta nekirin didey hesayî

Yan šerfê bike miẗalê Tacdîn
Pê navê ebed ji bo xwe bistîn

Yan pê bikire tu yarekê qenc

Ew çêtir e bo te ra ji sed genc

**Agahîya mîr e li ’işiqbazî û yarîya Mem û Zînan bi ifşa û ilqayîya neyaran û mudebdebînan**

Sultanê wilayet mehebbet
Serxeylê eyaletê meweddet

Gava ku ji mekmenê xulûşî
Binmîte li textê dil culûsî

Kengî diketin qebûlê estar
Hetta ’elema xwe naket izhar

Reh şubhetî padişahê encum
Tabende ji taremê çiharum

J`ew çend tebeqatê asimanî
J`ew çend-i mesafe û mekanî

J`ew çend-i ’enašir û sehaban
J`ew çend-i mewani’ û hicaban

Naçar-i diket nufûdê her rûz
Elbette dibîte ’alem efrûz

Ev padişehê ku ’işqiname
Rojê bi wî nisbetek temam e

Ev jî qe venaşirit çu caran
Naçar-i biker diket sitaran

Razê di dilê Memê û Zînê
Sazê ku di perdeya evînê

Hindî negehiştibû zebanan
Nedbûye ziyan ji bo xudanan

Midrabê zebanê xelqê nasaz
Bê perde ku bû terane perdaz

Zînê ne guneh Memê ne sûcek
Agah-i kirin buzurg û kûçek

Zengil bi deva gihan ve zengûl
Meftûlê enamilan ji merẍûl

'uşşaq-i ḧezîn û bê newa bûn
Xel teşne Ḧuseynê Kerbela bûn

Meclis bi newayê zîr û bem bûn
Memlû' ji hewayê Zîn û Mem bû

Barî li cemazeyê ne bes bû
Ẍemmazê di merteba ceres bû

Ye’nî xeberêd-i herdu yaran
Nemmam û ḧesûd û ḧîlekaran

Ew çend-i di meclisan gerandin
Ew çend-i bi qumšîyan gihandin

Ḧetta Bekirê ji rengê Iblîs
Šaḧib ẍereḏê xebîẗ û telbîs

Ew jî ji wî ḧalî bû xeberdar
Rabû ji cihê xwe ew ẍereḏdar

Tenha xwe gihande xelweta mîr
(El-qišše) kir ew qeḏiyye teqrîr

Mîr hate tehewwira bixîret
Bû ẍerqeyê beḧrê fikr û ḧîret

Pursî ji ewê xebîẗê salûs
Go: Ev xebera xilafê namûs

Em dê ku ḧeqîqetê ’eyan keyn
Serrişteyê tuhmetê beyan keyn

Go: Emrî bike Memê bixûnin
Hûn herdu di xelwetê ku rûnin

Mem ’aşiqê šadiq e bizan qenc
Vêra bileyîze tu bi set̲renc

Şert̲ê xwe ji wî bixwaze dilxwaz
Dê keşf-i bibit ḧeqîqeta raz

Gava ku ewî dikey tu meẍlûb
Bê: Rast-i bibê kî ye te met̲lûb?

Mem fihris û bet̲l û sînešaf e
Xasma bi te ra xu bê xilaf e

Ḧubba di dilê xwe naket inkar
Sirra xwe diket ji bo te iqrar

T̈abitqedem e di vê evînê
Dê bête ku ’aşiq im li Zînê

Paşî tu yî šaḧibê riyaset
Laiq wî bibîn çi ye siyaset

Ḧukkam-i ji cinsê şahimar in
Ešḧabê sumûm û muhredar in

Muhran ku diden bizan ku zehr e
Mihrê ku diken bizan ku qehr e

'aqil ḧeđerê diken ji maran
Ẍafil dibine muḧibb û yaran

Herçende li nik bi 'izz û nazî
Herçende di gel bi le'b û bazî

Cuz'î bibtin ji te teẍeyyur
Kullî diketin ji te tedebbur

Xasma ku hebin xebîẗ û xennas
Bedxwahê bexîl-i bin (mînen-nas)

Teḧqîq-i xerabtir in ji Şeyṯan
Ya Reb meke wan qerîbê sulṯan

## **Setrencbazîya Memê û mîr e bi şertê dilxwaz vedana damê tezwîr e ji bo keşfê raz**

Salarê mewakib û kewakib
Serdarê tewali' û ẍewarib

Sultanê serîrê çerxê rabi'
Weqtê weku bû ji şerqê tali'

Setrencî û mah û cund û exter
(Bil-cumle) li ser bisatê exder

Şehmat-i kirin bi beydeqa nûr
Te d`go hemî bûn di torê mestûr

Mîrê ku ji ẍîretê dilefkar
Şêrê ji ḧemiyyetê birîndar

Ḧetta sube xew nehate çavan
Sakin nedibû ji rengê avan

Rojê ku ji meşriqê numa nûr
Afaq-i kirin ji zulmetê dûr

Mîr rabû û hate şehnişînê
Nêzîkî serayê nazenînê

Rûniştin û we gote pîşekaran
Hûn gazî bikin nedîm û yaran

Tenha ji mi ra Memê bixûnin
Tacdînî di gel biran mexûnin

Îro li Memê ez ê ẍeḏeb kem
Sûcek wî heye, ez ê edeb kem

Nabit ku ji min bibin di ẍafil
(Bil-cumle) bi emrê min di 'amil

J`ew paşî şihande nik Memê xwend
Ḧaḏir kiribûn gulab û gulqend

Ew çende şerab û qend û şekker
Ew çende gulab û misk û 'enber

Înan û di meclisê gerandin
Keyfê di xwe ser bi ser gihandin

Encam û tekellum û xeberdan
Kêşa ku bi seṯrenc û bi nerdan

Mîr gote Memê bi kîn û kerb e:
Îro me di gel te ceng û ḧerb e!

Rabe ji me ra were muqabil
Bê şek bi te ra ez im mucadil

Şertê me di gel te, ey serefraz
Herçî te divê ji bo me dilxwaz

Lê mîr ji kuran hebû ciwanek
Meḧbûbê zeman e nuktedanek

Yûsif ji melaḧeta wî meḧcûb
Rustem ji şeca'eta wî meẍlûb

Hemšuḧbet û hemdemê Memê bû
Hemşahî û hemẍemê Memê bû

Serdarê kuran bi navê Gurgîn
(Fil-ḧal)-i xeber gihande Tacdîn

Ew beṯl-i ku bû ji ḧalî waqif
Rabûn bi wî ra Çeko û 'arif

Şêran verisande qeyd û zincîr
Hersê bi tebayî çûne nik mîr

Tacdîn ku di gel biran bi meş hat
Ke'beyn-i ji bo Memê duşeş hat

Fîl û rux û kerkeden ku hatin
Dîn mîr û mu'ellimê xwe mat in

Zanîn ku Memo bi bend û baz e
Mîr gote Memê ku destê taze

Sê dest-i ji mîr birin temamî
Mufsid fikirî ji wî meqamî

Zîn dî ku li pencerê dîyar e
Mihr e li mehê diket neẕare

Bedxwahî bibîn çi ḧîle rakir
Ev renge behaneyek eda kir

Go: Bend û leyîz û cih bi dor in
Hûn herdu cihan bi hev bigorin

Mem dê bibitin vê carê meẍlûb
Ḧasil bibitin ji bo te meṯlûb

Mîr rabû û çû cihê Memê jar
Mem hate cihê ji pêş ve dildar

Çavêd-i Memê ku dîn ruxê Zîn
Mift dane ji dest xwe fîl û ferzîn

Dil maye li pencer û şibakan
Hespê xwe dida li cih peyakan

Mîr bir ji Memê temam-i şeş dest
Mem bû ji meya ji pêş ve sermest

Mîr gote Memê: Me bir xwe dilxwaz
Wî go ku bibê çi ye te daxwaz?

Mîr go: Me ẍereḏ ne kesbê mal e
Meqšûdê ji ṯeyyê keşfê ḧal e

Meṯlûbê ji le'b û bend û bazan
Qeṯ nîne bi ẍeyrî keşfê razan

Şerṯê min ew e bikey tu iqrar
Kanê di dinê kî ye te dildar

Herçî perîya te dil li bal e
Ḧurîšifet e melekmiṯ̈al e

Ger laiqî te ewê bibînim
Malî bidem ez ji bo te bînim

Šaḧibẍereḏî di weqtê furšet
Ṯe'na xwe ji rengê def'ê tuhmet

Go: Min dîye ya Memê ḧebandî
Kîjek ’ereban e lêvdeqandî

Ser ta bi piyan reş e wekî qîr
Ney laiqê beḧï û xwestina mîr!

Ṯe’nê di Memê we rengeẗer kir
Yekcarî ji ’eqlî bê xeber kir

Beḧra dilê perde lê bi cûş hat
Nakam-i bi gazî û xurûş hat

Go: Qeṯ ne we ye wekî wî gotî
Mîr im, perîya dilê mi sotî

Şehzade ye, şehnişînmekan e
’enqa ye, bilind e, aşiyan e

Mîranî ye ew ji neslê pak e
Nûranî ye ew ne ab û xak e

Serdefterê ḧûr û nazenîn e
Herçende melek bi navê Zîn e

Mîr ev xeberê xilafê heybet
Gava ku bihîste hate ẍîret

Wî gote qebîleya x̌ulaman:
Hûn bo çi, gelî nemekḧeraman

Vî nakesî nagirin bi d̈illet
Da ez bikujim ewî bi ’ibret

Rabûne Memê du sed x̌eḏenfer
Mem rabûye pê di destî xencer

Tacdîn û Çeko di gel birayî
Rabûn bi te’es̆s̆ub û tebayî

Gotin: Gelî cundîyan, vewestin
Hûn cumle ne serxweş û ne mest in

Hûn qenc-i dizanin em kusan in
S̆aḧibhuner în û pehlewan in

Pansed ji we ḧemle ken bi kerban
Nadeyne we newbeta çu ḏerban

Gerçi we ecel bi dest me nîne
Emma we gelek ji dest me dîne

Ḧetta ku biken Memê giriftar
Sê sed ji we dê bibin birîndar

Ḧetta ne me her siyan bi ker ken
Hûn dê li Memê kusa nez̲er ken?

Herçî kirî ḧakimê me ferman
Em nabine mani'ê çu ḧukman

Destêd-i me bestine li ber mîr
Ha gerden û dest û pê û zincîr

Mîr rabû û dest û pê Memê best
Tacdîn mirina xwe wî demî xwest

Emma çi biket ji bo ne 'ar e
Cellad-i ne mîr e xundikar e

Mem girt û şihande pêşî serheng
Go: Ḧebs bikine di qulleya teng

Hilgirtin û birine pêşî duzdar
Meḧbûs-i kirin di qulleya tar

Dîwanî û meclisî belav bûn
(Bil-cumle) ji bo Memê di meḧzûn

Dîwanešifet bi ah û feryad
Hemyan dikirin ji bo Memê dad

### Xulûšiyet û xelašîya Memê ye di xelweta zindanê da ji šifatêd-i ḧeywanî muşareket û muşakeleta wî ye bi exlaqêd-i rûḧanî

Mihra felekê ezel ’edîm e
Kîna felekê ebed qedîm e

Herçî weku ew ji ’erdê raket
Elbette wî dê di ’erdê ra ket

’ulwî ji xwe ra ’eyan dixwazit
Sulfî ji me ra nihan dixwazit

Nabînî hero ku afitabê
Davête meẍareya turabê

Xasma ku di gel qebîlê ’aşiq
Hem xain û xar e, hem munafiq

Elbette dilê me ’işqibazan
Ewwel dibetin bi ẍunc û nazan

Axir diketin melûl û me°yûs
Manendî Memê đelîl û meḧbûs

Davêjite meḧbesê bi nakam
Datînite merqedê serencam

Ew bextireşê leqeb li wî Mem
Bê hemnefes û heval û hemdem

Havêtine çalekê bi zarî
Teşbîhî bi gorê teng û tarî

Mekrûh-i wekî dehanê ejder
Menkûr-i wekî Nekîr û Munker

Rûnişte di wê ve ’abidane
Zindan li wî bûye çillexane

Ew çeh li wî bûye çahê Nexşeb
Ew meh gerîya hilalê yekşeb

Šûfî ku gehişte kuncê xelwet
Şeyxînî gihand meqamê weḧdet

Geh şubhetî ’aşiqan bi dilxwaz
Geh şubhetî ’abidan bi daxwaz

Her leḧẕe di gel kela girînê
Ev renge digote nazenînê:

Kay miẗlê ḧerareta ẍerîzî
Îrohe di Mišrê dil’ezîzî

Sed car-i hero li qelbê ẍemnak
Pîrahenê šebrê min te kir çak

Geh geh çi dibit wekî Zuleyxa
Pursa mi bikey tu ey şekerxa

Leyla tu yî, ez ji bo te Mecnûn
Gulgûn ji te ra sirişkê purxûn

Ferhad im ez û tu bo mi Şîrîn
Seylab-i sirişkê çûyê şîrîn

Dunya li me gerçi bûye zindan
Îrohe tenê ez im musilman!

Lewra ji devê nebîyê mursel
Bû ev xeber e šeḧîḧ û mursel:

Dunya ku beḧiştê kafiran e
Me˚wayê belayê mu˚minan e

Herçende qewî muşewweş im ez
Ew çend bi muşewweşî xweş im ez

Sed sal-i bigêrî min tu meḧbûs
Ma ez qe dibim ji wešlê me˚yûs

Sûndê dixwim ez bi sûreyê Nûr
Dêma ku ew e kitabê mesṯûr

Deh car-i bi ḧeqqê bejn û balê
Çil car-i bi ḧeqqê zulf û xalê

Teḧqîq-i bi afitabê ruxsar
Teşdîq-i bi mahitabê dîdar

Te˚kîd-i bi qiblegahê ebrû
Te’ẕîm-i bi secdegahê gîsû

Sed car-i qesem bi herdu nûnan
’ehda min ew e di gel ’uyûnan

Ḧetta remeqek hebit ji canî
Cana! Tu di canî da nihan î

Hindî ku ji hecrê bêqerar im
Ew çende ji te umêdewar im

Herçende ku mîr li min ẍeḏeb kir
Ev qehre li min ji bê sebeb kir

Herçend xeberê Bekir wî guh kir
Ev cebre ewî li min bi cih kir

Lewra ku tu şah î ez geda bûm

Ez bo te ne kufʾ û hemliqa bûm

Tu mihricemal û mehcebîn î

Ev çende leṯîf û nazenîn î

Ez xar û ḋelîl û xakisar im

Ev renge ḏe'îf û dilfikar im

Perwane me, ten me daye agir

Suhtî me bi baṯin û bi ẕahir

Nîlûfer e dil tu afitab î

Ten şubhî kitan tu mahitab î

Ger teṉ birizit we ya bibit xerq

Wer dil bibitin di beḧrê ẍem ẍerq

Ḧeqqê min e 'edl e ẕulm-i nîne

Xaššiyyetê agirê evîn e

Ev çal e eger çi zêde kûr e

Emma ji 'edaletê ne dûr e

Šûfî me û šewme'nişîn im

Xweş ṯalibê nûrê rûyê Zîn im

Ḧašil qewimî meqamê (mûtû)
Ber mûcibê (qeble en temûtû)

Tezkiyyeyê nefsê bû mukemmel
Tešfiyyeyê qelbî bû muḧeššel

Ayîneyê rûḧê bû mucella
Nefs û dil û can bi hev mušeffa

Ew mu'tekifê di dewrê çalê
Hêja negehiştî dewrê salê

Belkî ne çil û ne (erbe'în)ek
Ẕenna di dilê wî bû yeqînek

Meşhûd-i bûyîn li qelbî enwar
Mekşûf-i bûyîn li ber wî esrar

Ayîneyê dil we bû mušeyqel
Šûret we bi me'neyê mubeddel

Ew heykelê meṯleba mecazî
Bû mel'ebê ṯiflê 'işqibazî

Ew mumkin û (ma sîwa) seraser
(Fil-cumle) ji bo wî bûne meẕher

Ev dar û ber û dewab û insan
Ev me’den û ev nebat û ḧeywan

Herçî ku bi dil wî lê neẕer kir
Herçî bi xiyal wî lê guďer kir

Her yek dinema ji bo wî “Zîn”ek
Meşhûd-i ji her yekî yeqînek

Goya bi xwe ew rešednişîn bû
Ew çal-i ji bo wî dûribîn bû

**Me°yûsîya Zînê ye bi sebeb meḧbûsîya Memê me°nûsîya wê ye bi ẍem û derd û elemê**

Zîna ku bi derdê hecrê ẍemgîn
Bê šebr û sikûn qerar û temkîn

Hindî weku Mem nebûyî meḧbûs
Hêja nedibû ji wešlê me°yûs

Gava weku Mem gihişte çalê
Ummêd-i nema ji bo wišalê

Nezhetgeh û şehnişîn û eywan
Lê bûne ḧešar û ḧebs û zindan

Hindî weku şerbet û t̲e'am bûn
Goya ku li wê hemî ḧeram bûn

Canî nedikir çi xwab û raḧet
Cismî nedidî çu tab û t̲aqet

Ew renge d̲e'îf û jar-i bûbû
Goya ku bi cismî tarê mû bû

Ew mû gerîyayî ze'feranî
Teşbîhî bi rengê rûyê Xanî

Şeb ta bi seḧer, seḧer ḧeta şeb
Fariẍ nedibû ji ḋikrê (ya Reb)

Her leḧẕe digote çerxê dewwar:
Kay ẕalimê bêeman û xûnxwar

Min qešd û ẍereḏ di gel te nîne
Aya te di gel min ev çi kîn e?!

Dewrek te nekir demek ji bo min
Pir dî te meger “Mem”ek ji bo min

Nûrek di rûyê me kir te peyda
Suhtin li Memê te pê siweyda

Şewqek di ruxê Memê te hil kir
Qelbê me bi wî te sot û kul kir

Aya te çi mešleḧet di min dî
Nîşanê me da, te yêkê cindî?

Ewwel te kusa li min ’eyan kir
Paşî te çira li min nihan kir?

Suhtim te bi agirê firaqê
Kuştim te bi derdê iştiyaqê

’alem hemî pêkve şad û xurrem
Dayîne min û Memê te me˚tem

Derdê xwe ji bo mi ra bibêje
Jehra di dilê xwe da birêje

Yûsif te li min şihande çalê
Hiştim te di vê xerabemalê

Ye’qûbišifet ḧezîn û nalan
Šebra dil û can te bir bi talan

Ez mayime her wekî Zuleyxa
Bê Yûsif û bê murad û me˚wa

Geh şekwe dikir ji bo Memê jar:
Kay Yûsifê bêguneh giriftar

Da fikrê nekî ku raḧet im ez
Da ẕen nebirî bi ṯaqet im ez

Wellahî qesem dikem bi Barî
Rojêd-i sipî şevêd-i tarî

Nînin ji me ra çu xwab û xwarin
Illa ku du dîde xûn dibarin

Bîdarî ye šen'etê du çavan
Xûnxwarî ye xwarina hinavan

Ey qibleyê qelbê min bi dilxwah
Wey ke'beyê can bi (Ke'betul-lah)

Her leḧẕe ji destê firqeta te
Her weqtî ji derdê ḧesreta te

Sed ah û du sed enîn û efẍan
Bêgav-i me tên ji nêv dil û can

Ev renge ye ḧalê min şeb û rûz
Ḧalê te kusan e ey dilefrûz?

Zindanîyê min! Te kî celîs e?
Sewda°îyê min! Te kî enîs e?

Ey dil tu ji qelbê min bi der kev!
Wey can tu ji bo dilî bi ber kev

Hûn herdu herin Memê bibînin
Lê yek xeberî ji bo me bînin

Ey dil tu ku lê dikey selamê
Zû bîneve bo mi ra peyamê

Bîdarî ye šen’etê du çavan
Xûnxwarî ye xwarina hinavan

Ey qibleyê qelbê min bi dilxwah
Wey ke’beyê can bi (Ke’betul-lah)

Her leḧz̠e ji destê firqeta te
Her weqtî ji derdê ḧesreta te

Sed ah û du sed enîn û efẍan
Bêgav-i me tên ji nêv dil û can

Ev renge ye ḧalê min şeb û rûz
Ḧalê te kusan e ey dilefrûz?

Zindanîyê min! Te kî celîs e?
Sewda˚îyê min! Te kî enîs e?

Ey dil tu ji qelbê min bi der kev!
Wey can tu ji bo dilî bi ber kev

Hûn herdu herin Memê bibînin
Lê yek xeberî ji bo me bînin

Ey dil tu ku lê dikey selamê
Zû bîneve bo mi ra peyamê

Kanê bi çi ḧal e ew giriftar
Danîn çi xiyal e ey dilefkar

Kanê li me aş e ya ne zîz e
Baẍê wî bihar e ya payîz e

Xweşreng û leṯîf e şubhê sorgul
Yan jar û ḏe'îf e miṫlê bulbul

Eywan li me bûye darê miḧnet
Zindan bi me bûye baẍê cennet

Xwezya ku li min ẍeḏeb kira mîr
Manendî Memê bi ẍill û zincîr

Ez jî bişihandima wê çalê
Rojek veketa li min ji salê

Carek bidiya min ew giriftar
Derman bikra min ew birîndar

'umrê min eger çi yek remeq bû
Ḧeqqa ku mirin ji bo mi ḧeq bû

## Tehewwira Tacdîn e ji ẍîreta birayî meşûreta di gel biran e li xelašîya bênewayî

Ecza˚ê kitabê ’işqibazî
Šeḧḧafê mucelledê mecazî

Şîraze û cuz˚ û bend û terkîb
Ev renge kirin bi nezm û tertîb

Kû Zîn û Memêd-i naz û perwerd
Gava wehe der vebûn li wan derd

Ew derd wehe bûye beḧrê ateş
Ew ateşê ẍem we bûye serkeş

Xelqê ku hebû ji ’işqê teşwîr
Wî agirî kir li wan we te˚ẗîr

Me’lûl-i bûyîn hemî bi derdan
Yekcar-i bi der ketin ji perdan

Xasma ku muwafiqêd-i dêrîn
Hem šuḧbetê wan Sitî û Tacdîn

Derdan we li wan ji nû ve serdan
Êdî nedihate jê xeberdan

Herçende ku ew ji van cuda bûn
Dîsan bi wî derdî mubtela bûn

Derdê Sitîyê xiyalê Zîn bû
Tacdîn ji ẍema Memê we dîn bû

Her lehẕe di gel biran bi şer bû
Qešda di dilê wî ev xeber bû

Rabit bi ẍeḏeb biçîte pêş mîr
Daxwaz-i biket Memê bi teqšîr

Carek biçitin Memê rica ket
Sûc û gunehê Memê tika ket

Da mîr ji mi ra birayî berdit
Ya ev ser û malî tê bi derdit

'arif wehe gote Rustemê Zal:
Ev emre bi min meḧal e bêqal

Bê ceng û cidal û bê tehewwir
Qeṯ vî şuẍilî mekin tešewwir

Ev me'reke nabitin bi dîwan
Em mane û šubḧê šeḧnê meydan

Ya qenc ew e em sube siwar bin
Her sê bi silaḧ û kar û bar bin

Çarane û cewşenan di ber keyn
Zendane û meẍferan li ser keyn

Gurzan bihejîn, riman bibazîn
Ev renge Memê ji mîr bixwazîn

Ya dê bi kutek Memê xwe berdîn
Ya cumle bi merdî ser bi der dîn

Ger wî bi vî rengî Mem reha kir
Derdê di dilê me wî dewa kir

Wer mayî mušir li ser 'inadê
Em dê bikerîn we reng cihadê

J`ewwel ve biçîn Bekir bi ker keyn
Wî mudbirî jê re der bi der keyn

Her ber derekî gurek li ber bit
Xešmaneyê qenc ser bi ser bit

Mîr er ji wî ra biket te'eššub
Rabit li me ew biket teẍellub

Aşê ecelê wisa bigêrîn
Teşbîhî ḧeban seran bihêrîn

Buhtan e bikeyne reqš û govend
Da bêne temaşeyê şekerxend

Gava weku dest bidîne ḧerban
Meḧbûb-i temaşe ken li d̲erban

Her leḧz̲e bibêjin ew perîzad
Destêd-i we ey ciwan merîzad

Hindek bigirîn hinek ẗena ken
Hindek bikenin hinek du'a ken

Dildar-i nez̲er bikin ji burcan
Durdane bi der kevin ji durcan

Şehzade ji penceran nez̲er ken
Gulpîrehenan di ber xwe ker ken

Her dem bibihîn ji nazenînan
Sed medḧ û hezar-i aferînan

Tacdîn xebera birayî guh kir
Muḧkem di dilê xwe da bi cih kir

## Te'eššub û tedaruka Tacdîn û biran e bi emrê xîretê siwarîya wan e li hespê ḧemiyetê

Ser šubḧe ku şehsiwarê efleq
Eşheb ku kişande cayê ebleq

Edhem di ṯewîleyê nehîn kir
Eşheb ji xwe ra ji nû ve zîn kir

Gurzê xwe yê ateşîn der anî
Tîxê xwe yê zerfeşan ku danî

Dunya ji mehabeta xwe zer kir
Tîx û kemera çiyan bi ker kir

Tacdîn û biran ji xelqê lalî
Xwestin bi dilê xwe wan ḧelalî

Kêşane derê bi reqš û bazî
Rexşê 'erebî semendê tazî

Mismar-i kirin bedew ji xeflet
Hişyar-i kirin 'edû bi šewlet

Meydan bi dewan kolan bi destkor
Goya vedidan li dujminan gor

Tacdîn ji tewabi'ê xwe yek pîr
Te'yîn kir û zû şihande pêş mîr

Gotê here bêje mîr û aẍan
Bînende venakujin çiraẍan

Mîrê me eger çi dûribîn e
Îro wî di çavî nûr-i nîne

Em çar-i bira hebûn di šadiq
Her çar-i li xidmeta wî 'aşiq

Ịnšaf e ku zêdetir ji salê
Mem maiye bê xudan di çalê

Dujmin li me şane dost-i ẍemgîn
Ferḏ e mirina Çeko û Tacdîn

Mem gerçi ku zêde pur gunah e
Lê 'aşiqê 'işqê padişah e

Ḧukmî tu meke li padişahan
Ẕulmê tu meke li bêgunahan

Em hîvî dikeyn Memê riha ket
Derdê di dilê Memê dewa ket

Em çar-i bira ne çar-i dîwar
Erkanê se'adeta wî her çar

Her çar-i serêd-i me wekî go
Çewganê iradeta wî kaşo

Ya mešleȟetê ji bo me çê ket
Ya ne ji me ra Bekir bi rê ket

Da em xeberan ji bo wî bêjin
Derdêd-i xwe em li wî birêjin

Rûmet me nema li rûyê 'amê
Dê neql-i bikeyn biçîne Şamê

## Tedbîra Bekir e ji bo def'a mezennet û 'inadê tezwîra wî ye ji tirsa fitne û fesadê

Teqrîrê ku kir temam-i qašid
Waqif gerîya bi ḧalî ḧasid

Zanî ku ji bo wî ra xerab e
Go: 'efw-i ji bo Memê šewab e

Mîr im me nego ji bo te pêşîn
Tacdîn û biran ji xwe meêşîn

Zînê bide wan we ya bikuj min
Yan ew bi te ra ne xešm û dujmin

Ya qenc ew e qet nekey tekellum
Tacdîn ji te naketin tewehhum

Bêjê: Me fida kirin Mem û Zîn
Tezwîc-i kirin me dane Tacdîn

Zahir meke tu evê 'inadê
Carek vekuj agirê fesadê

J'ew paş-i tu pêxe weqtê furšet
Zinhar-i! Medê eman û muhlet

Xešmê ku neşêy bibî muqabil
Derman çi ye? Şerbeta helahil!

Lew lazim e ḧakiman du fincan
Yek xašê xerab e yêk e qencan

Da yek nexweşan ji bo wî xweş ket
Ya dî ji wî ra xweşan nexweş ket

Yek canî ji dujminan cuda ket
Ya dî mirîyan ji nû ve raket

Kerba xwe meke tu aşikara
Ya qenc ew e em bikeyn mudara

Şol in hene ew bi kerbê nabin
Lewra ku bi zor û ḏerbê nabin

Ustadî divêtin û te˚emmul
Ixfa˚ û teẍaful û teḧemmul

Ewqatê zeman e gûnegûn e
Barî ji me ra kirin nemûne

Ya'nî şev û roj û šubḧ û şam in
Hin ruhnî û hin ji wan z̠elam in

Em jî di leyalî û neharan
Da bên bi nihan û aşikaran

Hin z̲ahir û hindekan bi xef keyn
Rakin hinekan hinan telef keyn

Wî mulḧidî şîr wisa seqa kir
Mišrî ji xwe ra wisa bira kir

Pend û ẍelet̲ û xilaf û yalan
Bend û seqet̲ û ẍilaf û kalan

Tešnî'-i kirin wî hinde teşnî'
Bestin wî li şîrî şubhî teršî'

Ew şîr-i li bin serê xwe danî
Ew renge veşar ku kes nezanî

Mîrê weku dil bi kerbê sotî
Herçî ku Bekir ji bo wî gotî

Bawer kir û gote merdê qašid
Ey pîr-i meke tu fikrê fasid

Ger fewt-i bikem cemî'î ferd̲an
Tacdîn ku didem ji dest xwe erzan

Min şewket û selt̲enet bi wî ne
Ev şuhret û şahî min ji wî ne

Ev nam û nişan û ev meqam e
Bê xat̲irê wî li min ḧeram e

Ew Rustem e, gêw e, lendeha ye
Gencîne me ez, ew ejdeha ye

Bêjê bi dilê xwe min Mem û Zîn
Herdû bi ḧelalî dane Tacdîn

Bê wech-i ji min tu bûyî weḧşî
Daxwaz-i te kir ku min nebexşî?

Tacdîn û Çeko bi 'izz û naz in
Dê her we bitin wekî dixwazin

Qašid ku rewan e bû ji pêş mîr
Teqrîr-i ku kir temam-i te'bîr

Şêrê deleşer we bûn mulaim
Gotin dem û dewleta wî daim

## **Nešîḧeta šaḧibẍereḏê purmereḏê dilkul ji bo mîrê bêtemîzê sadedil**

Êvarî ku asimanî menqel
Danî û li wan veşar-i meş’el

Ye’nî ku vekuşt çiraẍê zerrîn
Wergirte ji nû libasê rengîn

Mîrê ku hemîşe şad û xurrem
Goya ketibû libasê matem

Wî bextekê rûsiyahê mel’ûn
Gava ewî dî emîr-i meḧzûn

Go: Ẍem mexwe ey çiraẍê dewlet
Ger ’umr-i bidet ji bo me muhlet

Ev kerb û elem eger te navê
Zînê û Memê ji dil xwe bavê

Ew herdu ne ba’iẗê fesadê
Ew bûne sebeb ji bo ’inadê

Ger iđnê bidet ji bo mi ra, mîr
Ez dê bikujim Memê bi tedbîr

Tacdîn û biran bi şerbetek zehr
Tu d`şêyî demek ewan bikey qehr

Emrê ku dibit tedarek asan
Ageh meke bê tu xelq û nasan

Mîr im, tu here bibêje Zînê
Mem suhtiye agirê evînê

Mem teşne tu abê zindiganî
Mem murde tu canê cawidanî

Bêje ku here Memê derîne
Min dayiye te ji bo xwe bîne

Min zanîye Mem ziyade jar e
Perwane ye meqšeda wî nar e

Gava ku nez̲er biket li Zînê
Teḧqîq e ku naketin çu jînê

(Fil-ḧal)-i dema ku wê bibînit
Bawer meke ew bi riḧ bimînit

Mem ger bi vî rengî zû fena bit
Dê keşmekeş û niza'-i rabit

Mîrin hene ’aqil in ’ezîz in
Lê sadedil in di bêtemîz in

Ew sade ji bulh û natemamî
Dil nadene menşe°a kelamî

Wan dil guh e, guh bi dil ve nîne
Reşçav in û merdumek sipî ne

Herçî ku dibêjinê ẍereḏdar
Bawer diken ew bi rastî û xwar

Nabên ev e qenc e ya xerab e
Nabên ev e xeṯ°e ya šewab e

Qaširneẕer in di bê te°emmul
Ḧaḏir bi xeḏeb di bê teḧemmul

Eẍleb dibin ew bi ’eqlî meẍrûr
Ekẗer dikerin ji danişê dûr

Bedxwah û bexîl û bedsigalan
Bedešl û sefîh û bedfi’alan

Tînin dikene refîq û rehber
Bednam-i dibin wezîr û serwer

Dispêrine van kesan umûrê
Ew têxine dewletê qušûrê

Mîrêd-i bi dewlet û feraset
Šaȟibşefeqet xwedansiyaset

Ew her kesekî xudan-i naken
Ȟetta weku imtiȟan-i naken

Çil car-i diken yekî mucerreb
Paşî ewî dê biken muqerreb

Ev mîr û wezîrîya cihanî
Ev begî û gizîrîya zemanî

Herdû bi miẗalê yek leyîz in
Herdû di beṯal û bêtemîz in

Ȟetta weku ker nebî tu, el-ȟeq
Kengî dibiye wezîrê muṯleq!?

**Ruxšetdana mîr e li dîtina dildarê**
**bêhişbûna Zînê ye ji ĥewq û şewqa dîdarê**

Tedbîr-i kunende pîrê ’aqil
Ev rengehe bû ji bo me naqil

Go: Mîr bi muşawerî û rayê
Weqtê wekû çû ĥeremserayê

Zîn gazî kir û li ba xwe danî
Ew perde ji ser sirê hilanî

Go bêdilîya Memê me bes kir
Azurdeyê min li wî ’ebes kir

Cewr û sitema ku min li wî kir
Ew cewr-i te kir sitem ewî kir

’işqa te ji wî ’eqil reva bû
Şeyda û cunûn û mubtela bû

Zanî ji ĥekîmekî me tedbîr
Dîwane dewa dibin bi zincîr

Lew min bi ẍeḏeb şihande çalê
Ew ĥebs-i li wî gihande salê

Da ’işq-i biket kemalê ȟašil
Ȟubba we neket wišal-i baṯil

(Fil-ȟal)-i dema bi qelb û canî
Miqdarê meȟebbetê we zanî

Hûn herdu di merteba kemal in
Meqbûl in û qabilê wišal in

Mem ’aşiqê šadiq e bi teȟqîq
Qelbê me diket ji bo wî tešdîq

Me˚mûr e bi emrê padişahî
Me’dûr e bi ’uḋrê bêgunahî

Herçî ku li wî biket ’itabê
Elbette dibînitin ’iqabê

Ȟusna te ye ew kirî giriftar
Ȟubba te ye ew kirî birîndar

Tîra wî li dil ketî te lê da
Ew dariwê bêhişî te pê da

Ew surme di çavê wî te kêşa
Ȟetta tu nedî wî dil neêşa

Zulfa te li dest û pê wî bestî
’eqrebšifeta dilê wî gestî

Ṯewqa te li gerdena wî danî
Dava te veda li qelb û canî

Çawa vekirin te her du ahû
Berdane feqîrî her du cadû

Dîsan tu here di gel xeber de
Qeydan tu veke ji bo xwe berde

Ey ẍunceyê naşukufte sorgul
Bişkên qefesê derîne bulbul

Ew têhn e tu kahnîya Furat î
Ew xest e tu çeşmeya ḧeyat î

Ew teşne tu abê zindegan î
Ew murde tu canê cawidan î

Ew perdegîya ku pur hewa bû
Medbûṯ-i di perdeya ḧeya bû

Ew perde birayî lê hilavêt
Xûnê di dev û kepê wê havêt

Zîna ku du sed birîn li cergê
Çû ḧaletê fewtê şadimergê

Beḧra ku ji cunbuşa hewayê
Mehfûẕ-i di perdeya ḧeyayê

Ḧaciz ku hewa reva ji mabeyn
Berzex ji ḧeya nema di beḧreyn

Ew qulzumê ẍem kelî bi ser coş
Ser coş û kelî perande serpoş

Serpoş-i perî ji dil pela xûn
Havête wekî Ferat û Ceyḧûn

Goya hejîya hezar-i mîşe
Mey bû rijîya ji qelbî şîşe

Mîrê bi ẍeḏeb ketî li Zînê
Ew reng-i reva kela girînê

Ḧaḏir ji duwê kebabê ulfet
Gerya wî di çavî eşkê şefqet

Fewwareyê merḧemet bi kel hat
Bê gav girîya ewî di gel hat

Ew çend-i kirî bira di gel wê
Ḧetta sube herdu man di xelwê

Zîn xerqeyê xûnê dil wekî gul
Mîr lê digirî miẗalê bulbul

Meḧrem hemî vêk ketin li ba wan
(Bil-cumle) bezîne dest û dawan

Kay Xusrewê ḧeqşunasê ’adil
Naḧeq tu ji bo çi bûyî qatil?

Zîn gulbenê baẍê ’išmetê bû
Zîn serwê riyaḏê ’iffetê bû

Pakîze dura šedef ji her can
Laiq te nebû bigêrî mercan

Nazikbedena leṯîfe me’šûm
Bê curm-i bikey ji ’umrî meḧrûm

Ev renge di xak û xûn tu rakey
Bê sûc-i ji can beden cuda key

Mîr go: Mekerin xiyalê baṯil
Ew bêhiş e, ez nebûme qatil

Zînê dikujim meger bi ’emda
Ṯûba ye di cenneta ḧerem da

Ehlê ḧeremê bezîne ser wê
Cobar-i rewan kirin li serwê

Bû şîwen û şîn di xan û manan
Feryad-i gihane asimanan

Yek hate ji derve nagehanî
Go: Mem mir û da we zindeganî

Zînê mirina Memê bi guh ket
Goya miribû ji nû bi riḧ ket

Rabû fikirî di çar kenaran
Dî mîr digirîte şubhî baran

Xelqê ḧeremê xewaš û ’amî
Me°temzede bûne (bil-temam)î

Go: Ey sebebê se’adeta min
Bê keyf-i mebe di de’weta min

Ey şah-i te daye rûḧê ruxšet
Fewta xwe wê dî ji bo xwe furšet

Can çû û bi canî mutteŝil bû
Ew rûḧ-i bi rûḧ-i mud̲meḧil bû

Ḧetta ku nebû j`devê te iqrar
Ew mayî di ḧebsê ten giriftar

Teşbîhî Memê melûl û meḧbûs
Bo ḧifz̲ê rid̲a û nav û namûs

Ew lew nediçû ḧeta ve îro
Mabû li jivanîya te gîro

Rûḧ im te ji dil dema rid̲a da
Şah im te di mulkê ten ŝela da

Cismê min e bê newa giran bû
Rûḧa min e natiwan rewan bû

Derḧal-i ji qalibî bi der ket
Şewqek ji ruḧa Memê bi ber ket

Wan terk-i kirin serayê fanî
Ew çûne cehanê cawedanî

Herçî ku qebûl neket mekanan
Dê seyrê biket di (la-mekanan)

Hûn vê seferê xelet̠ mexûnin
Şahid ji me ra muqerrebûn in

Gava weku can ji ten rewan bû
Canan-i wî dît û can bi can bû

Ḧašil ku ji paşî ittišalê
Ew pertewê meş’ela cemalê

Gavek sekinîn û mut̠me’in bûn
Ḧîna ku bi yek ve mu’temin bûn

Ew qet̠re di qulzuma šifatan
Ew đerre di beḧra muhlikatan

Dem hatine saḧilê fenayê
Geh çûne bi ser ḧedê beqayê

(Fil-cumle) ji merkeza turabê
Ew đerre gihane afitabê

Qet̠’a ne bi ittišal û teḧlîl
Meḧd̠a ne bi infišal û teḧwîl

Wan rê ku birrîn bi canibê đat
Baqî gerîyan bi đatê đerrat

Nînin 'eceb ev xeber ji bo min
Hûn vê mekene huner ji bo min

Şeyxê weku ez bi dil murîd im
Ew rûḧê rewan e ez qedîd im

Herçend-i li ba we navî Mem bû
Lê padişehek 'alîhimem bû

Bû laiqê ferrê padişahî
Meqbûlê teqerruba îlahî

Qelbê wî ye wadîya muqeddes
Rûḧa wî bi nûra ḧeq muqebbes

Hilgirtim û birme Ṯûrê Sîna
Bîninde kirim di gel xwe bîna

Îname derê ji vê ḧicabê
Ev ḋerre gihande afitabê

Ḧîna ku bi can min ev sefer kir
Ev can me ji canfiroşî qer kir

Herçend-i ku ẕahir (eqli'î) got
Ḧaḏir wî di pê ve (irci'î) got

Lew hatime da bikem we raḏî
Merḏiye bibim li pêşî qaḏî

Da ez bikerim di gel we tewdî’
Da hûn bikerin di gel mi teşyî’

Dîsan vegerim ji ba we reqqaš
Murtaḏ-i bibim bi cenneta xaš

**Tewšiye û tedareka Zînê ye ji bo sefera axretê teheyu'ê esbabê cihaz e ji bo 'erûsîya cennetê**

Zînê ku numane wan keramat
Ev çende menazil û meqamat

Rûnişt û wešiyeta xwe bo mîr
Ev rengehe kir beyan û teqrîr

Kay padişehê ruȟan û qelban
Hemşîre bûyî fida û qurban

Qurbanî te bin hero du sed Zîn
Ez hîvî dikem nebî tu ẍemgîn

Roja weku bir me Mem ji bo xwe
(Bil-cumle) birin me ẍem ji bo xwe

Menšûr-i bûyîm li kişwerê ẍem
Ẍem bûne ji bo me ra musellem

Mem bo min û merȟemet ji bo te
Ẍem bo min û seltenet ji bo te

Şah im, bi me ra mebe munazi'
Ez bûme bi huššeya xwe qani'

Rûnî tu li textî şubhî Xusrew
Tacê xwe yê zer bigêre keçrew

Bezma ṯerebê bidêre tertîb
Ḋewq û fereḧê bigêre terkîb

Serxweş bike sade û riwalan
Çûn xweş ke ji nû ve pîr û kalan

Esbabê neşaṯ û kameranî
Adabê šefa û zindeganî

Amade ke şerbet û ṯe’aman
Azade ke cariye û ẍulaman

Pur ke ṯebeqan ji bo niẗarê
Da bên fuqera di vê hewarê

Mecmû’-i bike muferreḧatan
Mexlûṯ-i bike mu’eṯṯeratan

Meclis bibitin bi wan muđehheb
Tehniye bibit ji nû muretteb

Da vêk bikevin li min şekerxend
Têk rahejîyên bi reqš û govend

Eqsamê bixûr û ’ûd û ’enber
Mawerd û zubad û miskê eďfer

Ev cins-i ji ni’metan pitir bin
Ew qism-i ji ȟeddî zêdetir bin

Ȟeywaniyeta me bûye zail
Rûȟaniyeta me bûye kamil

Cismê me eger diçîte çalê
Rûȟêd-i me dê biken wišalê

’eqda weku dawetî melek bin
Eqsamê bixûrê wê gelek bin

Lewra ez û Mem melekšifat în
Em mailê ţîb û ţeyyibat în

’ursa ku firişte dawetî ne
Damad û ’erûs-i cennetî ne

Roja ku Sitî te daye Tacdîn
Çawa te di şehrî beste ayîn

Tenbîh-i bike dukan û sûkan
Tezyîn-i biken ji rengê bûkan

Buhtan tu bibê bila siwar bin
Cundî tu bibêje da bi kar bin

Sergerm-i bibin wekî di ’îdan
Hindî ku li hev biden cirîdan

Roja ku te ew perî bi rê kir
Çendî weku keyfxweşî te çêkir

Ez hîvî dikem bikey ’inayet
Qanûnê bikey wisan ri’ayet

Îrohe ji bo murad û çendan
Dîsan tu wisan bî şad û xendan

Iḧsan ke tedarek û cihazan
Ḧaḏir bike muṯriban û sazan

Manendî ’imareta Sitî tê
Her şubhetî meḧmela perî tê

Tabûteke zer nigar û rengîn
Šindûqeke xuredekar e zerrîn

Serpoşê ewê zemîn ṯela bit
Seywanê ewê xudan cela bit

Zinhar-i! Me herdu bûk û zavan
Bê qedr-i nekey li pêşî çavan

Gava ku diçîne nêv mezarî
Da xelq-i nebêjitin bi zarî

’eqda Sitîyê çi roje xweş bû
Zînê ji ezel çi bextireş bû

Ne’şê me bila Sitî di gel bit
Tacdîn-i di gel Memê bedel bit

Manendî Memê ji boyî Tacdîn
Tacdîn bi wî ra bigêre şûşbîn

Şûşbîn bitin ew di gel Memê min
Şahî bitin ew di gel ẍemê min

Ey mayilê xeyrê bê mukafat
Wey badilê meqšed û muradat

Ḧetta veke salekê temamî
Hindî ku telef dikey ṯe’amî

Hindî ku bi der didey libasan
Hindî vedixûnî ’am û xašan

Hindî ku bi ker dikey qumaşan
Hindî ku belav dikey me'aşan

Her roj-i bi niyyeta ẍezayê
Hindî ku gelek dikey 'eṯayê

Hindî weku tu li textî rûnî
Her roj-i tu cundîyan vexûnî

Hindî ku tehî dikey xezînan
Hindî ku tu şa dikey ḧezînan

Hindî ku ẍenî dikey feqîran
Hindî ku reha dikey esîran

Hindî di ḧukûmetê xeber dey
Hindî weku girtîyan tu berdey

Hindî ku ji bo xwe ra dikey xerc
Herçî di xezîneyan dikey derc

Qehra weku dujminan diket def'
Zecra weku ẕaliman diket ref'

'edla ku ji bo Xwedê tu xaš key
Meẕlûm-i ji ẕaliman xelaš key

Sazî ku di cengê da dibêjî
Xûna ji muxalifan dirêjî

Ḧetta xurekê šeyê şikarî
Ḧetta 'elefê kerêd-i barî

Şah im, li te bit wešiyeta min
Wan šerf-i bike bi niyeta min

Mefkir di ḧeqîqet û mecazî
Binvîse li deftera cihazî

Da fexrê bikem li pêşî zavê
Şermende nebim di weqt û gavê

Herçend-i ku min qewî dirêj kir
Pirbêjî ye wê çira mi bêj kir

Gorî te me, meqšeda me dûr e
Dûr bit ji te, merqeda me kûr e

Lew hinde qeder dibêm bi diqqet
Da bête dilê te reḧm û riqqet

Der ḧeqqê min û Memê nekey 'ar
Gava dimirit Memê birîndar

Ez dê bi cenazeyê we ra bim
Ḧetta veke meqberan teba bim

Weqtê dimrim bidey tu destûr
Da min bikirin di gel wî mestûr

Min j`alê wî der bi der negêrî
Bê perde di gel ewî veşêrî

Zînê ku kirin wešiyet axir
Ẍaib gerîyan ji derdî ḧadir

Mîr go: Tu here Memê bibîne
Ger dê mirî bit ewî vejîne

Bawer tu bike bi šidq û îman
Bûme li te û Memê peşîman

Ger hûn bimirin we ger ku rabin
Nabit tu û Mem ji hev cuda bin

**Peşîmanîya Mîr Zeyneddîn e li meḧbbeta Mem û Zînan**
**merḧemeta wî ye li ḧalê nazenînan**
**mirina Memê ye bi axuftina birînan**

Zînê ku bihîstin ev tekellum
Ev mihr û wefa û ev tereḧḧum

Rabû xemilî ji payî ta ferq
Bû beḧrê ḧusin di gewheran ẍerq

Dayîn û Sitî û sed peristar
Xurşîd û meh û nucûmê seyyar

(Bil-cmle) bi der ketin ji burcan
Durdane bi der ketin ji durcan

Sed cariye û Sitî û dayîn
Hilgirtin ewê bi resm û ayîn

Zanî ku nebû murad-i ḧašil
Bê xelwetê xaš û şeyxê kamil

Ew zehre miẗalê đerre reqqaš
Bû meḧremê razê xelweta xaš

Gava ku gihane xelwexanê
Dergeh vekirin li ḧebsexanê

Ew pêkve bi meş'el û fener çûn
Dayîn û Sitî hinek di ber çûn

Dîtin ku di saḧilê šedefwar
Ew ẍerqeyê beḧrê 'işqê xûnxwar

Durdaneyê bê bihayê canî
Der daye ji dest xwe rayeganî

Fanûs û qefes we maye bê tab
Gulzarê beden we maye bê ab

Wan pirs-i kirin ji xelqê bendî
Ḧalê wî feqîr û mustemendî

Xelqê ku di gel Memê giriftar
Gotin ku me dî ji seṯḧ û dîwar

Berqek bi 'eceb Memê bi ser ket
Şewqek ji serê Memê bi der ket

Yek şubhetî roj û yek heyîv bû
Yek şubhetî zêr û yek ji zîv bû

Ew şems û qemer ku muttešil bûn
Derḧal-i bi yek ve muḏmeḧil bûn

Gava ku bi yek ve muqtebis bûn
Ew herdu li ḏew'ê mun'ekis bûn

Ew reng geřîyan munîr û rewşen
Zindan li me kirne šeḧn û gulşen

Mem jî bi vî rengî bêxeber bû
Xûna dilê wî bi derve der bû

Ey dîdeyê dil nebûyî meftûḧ
Inkar-i nekey tecellîya rûḧ

Da fikr-i nekey ku ev ḧulûl e
Yan nesx e xurûc e yan duxûl e

Da ẕen nebiřî ku ev miẗal e
Ya qewlê ḏe'îf e ya beṯal e

Xewna tu dibînî ev meqam e
Şey'ek ji şuhûdê natemam e

Hem šuḧbetîya Memê mukerrem
Agah-i kirin heval û hemdem

Wî murşidî qenc li wan neẕer kir
Qelbê wî di qelbê wan eẗer kir

Hemxelwetîya Memê giriftar
Bû perdeguşayê yar û eẍyar

Dayîn û Sitî ku çûn bi serdan
Hindî ku ewan di gel xeber dan

Gotin ku Memo tu rabe Zîn hat
Rûḧa te ye bê guman yeqîn hat

Ew teşnelebê zulalidîdar
Şadab-i nebû bi navê dildar

Hindî ke reha dilî kişandin
Hindî ku gulav-i lê reşandin

Wan seh nekirin di cismî canek
Illa ji serî diçû duxanek

Wî murde çiraẍî nagehanî
Dûkel ji serî diçûye banî

Zîn hat û ji pêş ve bû ḧewale
Bedrê ku veda ji ber xwe hale

Berqe' ku veda ji ber cemalê
Xurşîd-i nema di gel hilalê

Zînê wehe gote wî bedîhî:
(Qum ya ceseden nefextû fîhî)

Şewqa xeberê devê şepalê
Berbûye serê di wê şemalê

Wê dûyê qebes ji şewqê ragirt
Qendîlê qefes qebes ku dagirt

Ew xelwetîyê di i'tikafê
Rabû ve bi niyeta ṯewafê

Ewwel ewî kir bi šidqê derdem
Tecdîdê wiḏû bi abê zemzem

Westa li mušella û meqamê
Wî cebhe gihande istilamê

Ṯewfek du kirin li dorî Beytê
Perwaneyê per gihande zeytê

Gava weku per li wî disotin
Wan çend-i kelam bi yek ve gotin

Perwaneyê go: Tu xweş delîl î
Şem'ê wehe go: Tu xweş xelîl î

Perwaneyê go: Tu rehnima yî
Şem'ê wehe go: Tu canfeza yî

Perwaneyê go: Tu dilfirûz î
Şem'ê wihe go: Tu sînesûz î

Perwaneyê go: Tu çaresaz î
Şem'ê wihe go: Tu dilnewaz î

Perwaneyê go: Tu padişah î
Şem'ê wihe go: Tu qiblegah î

Perwaneyê go: Tu ḧûrê đat î
Şem'ê wihe go: Tu nûrê đat î

Wan teşnelebêd-i bêtekelluf
Wan suxtedilêd-i bêtešerruf

Ev reng dikirin bi yek ve šuḧbet
Lêk 'erḏ dikirin kemalê ulfet

Dayîn û Sitî û ew peristar
Ew bendî û ḧebsî û giriftar

Sergerm-i bûyîn bi guft û goyê
Sermest-i bûyîn ji bihn û bûyê

Wan gote Memê ku ey cegerxûn
Em hatine da nebî tu mecnûn

Zîn bû sebebê cinûnîya te
Mîr bû sebebê zebûnîya te

Mîr bû bi te ra xudan terehĥum
Zîn hat û di gel te kir tekellum

Ger teşne yî ev he abê ĥeywan
Wer xeste yî hate ser te Luqman

Mecnûn î xwe hate ba te Leyla
Ger Wamiq î ha ji bo te 'edra

Ger bulbul î gul ji bo te ĥadir
Nîlofer î mihr-i bûye nazir

Perwane yî şem'-i wê eyîsa
Wer murde yî hate ser te 'îsa

Dîwane mebe bi vî hewayî
Bêgane mebe tu aşina yî

Ĥûra ku te can û dil di des bû
Zîna ku te daima hewes bû

Çawa te divê we hate ba te
Dunya ye fena ye hat û bat e

Erzan mefiroşe ’umrê d̲ai’
Bîhîde mebe li canî bai’

Cama ecelê ḧeta binoşî
Nabînî ji bo xwe canfiroşî

Dîsan xwe bi ’eqlî aşina ke
Zincîrê cinûnîyê reha ke

Lewra vekirin me qeyd û zincîr
Rabî bi me ra biçîne pêş mîr

Šaḧibkerem û xudan’et̲a ye
Z̲illa wî siha perê huma ye

Vêkdane ji bo te yar û eḧbab
Ḧad̲ir kirine bisat̲ û esbab

T̈abitqedem e li de’weta te
Rû daye te bext û dewleta te

Derḧal-i dema biçî muqabil
Dê bo te biket muradê ḧašil

Çawa te ji wî murad e dilxwaz
Ew renge te dê biket serefraz

Weqtê ku Memê bihîstin ev pend
Ev rengehe go ewê hunermend

Ez naçime ḧeḏreta çu mîran
Ez nabime bendeyê esîran

Ev mîr û wezîrîya mecazî
Ev şe’bede û xeyal û bazî

(Bil-cumle) beṯal û bêbeqa ne
Bê ’aqibet in hemî fena ne

Mîrê ku mirin hebit ne mîr e
Me’zûlî hebit ewê esîr e

Em çûne ḧuḏûrê mîrê mîran
Wî ḧakimê ḧakim û feqîran

Şahinşehê mîr û padişahan
Bexşendeyê tuhmeta gunahan

Ê çêkirî neynika cemalê
Tîra xwe numa bi zulf û xalê

Fanûsê beden kirî mu̱tella
Tê da ji me ra kirî tecella

Ew mîr û ȟekîm e (Ḋul-celal) e
Bê ’ezl û teẍeyyur û zewal e

Tezwîc-i kirin di ’alema ẍeyb
Te°bîd-i kirin bi emrê (la-reyb)

Bakûreyê baẍê ’izz û nazîn
Sed şukr-i ku bikr û serferaz în

Ȟaşa ku di vî serayê fanî
Bê cennetê ’ednê cawidanî

Ȟeywanšifet em bikîn zinayê
Bîhûde di meskenê fenayê

Ter damen û sernigûn û merdûd
Şermende biçîne pêşî Me’bûd

Me’bûdî ji bo me ȟûr û ẍilman
Tezyîn kirine di baẍê Rid̲wan

Ew munteẕir in li riȟleta me
Fexrê diken ew bi de’weta me

Lê cennetê ’aşiqan cuda ye
Mî’adê liqayê kibriya ye

’alîtir e ew ji baẍê Riḏwan
Naguncine wê çu ḧûr û ẍilman

Hîvî diken em ewî ji Me’bûd
Nînin me bi ẍeyrî wî çu meqŝûd

Gava ewî kir temennî axir
Dergah-i vebû li ber wî ḧaḏir

Ṯeyrê ku qefes li ber vebûyî
Ew renge firî wekî nebûyî

Destê xwe ji qeyda gil kişandin
Çengêd-i dilê xwe raweşandin

Şehbaz-i ji qeydê merkeza ferş
Perwaz-i kir û gehişte (Ḋil-’erş)

**Te’ziye û me˚tem û merẗiye û şîwena Memê şehîd e mirina Bekirê şeqî bi destê Tacedînê se’îd e**

Ew me˚temîyê ku ba xeber bû
Ev renge ji bo me newḧeger bû

Go: Can ku ji ḧebsê ten cuda bû
Feryad û fiẍan ji şehrî rabû

Bû welwele û fiẍan û zarî
Bû zelzele û bezîn hewarî

Buhtan ji mezin ḧeta biçûkan
Niswan û keç û benat û bûkan

E’yan û ekabir û e’alî
Mîrza û rewal û la-ubalî

Yek ferd-i nema di şehrî dilxweş
(Bil-cumle) di serxweş û muşewweş

Vêkra dibezîn bi ser Memê ve
Wan derd-i birin bi ser ẍemê ve

Tacdîn û Bekir bi ittifaqî
Bûn herdu li ’erdekî mulaqî

Go: Ey sebebê fesadê ’alem
Şeytanšifetê li şeklê adem

Ew ba’iẗê fitne û fesadê
Wey mani’ê meqšed û muradê

Ey perdedirê Memê û Zînê
Wey daẍkeşê li ser birînê

Iblîsê xebîẗê pur nedamet
Bes nîne li min te kir qiyamet

Der ḧeqqê Memê seqet xeber da
Ḧetta ku li min te Mem bi der da

Ev çende munafiq û neyar î
Hêja tu bi çavê min dîyar î

Mem dê bimirit tu dê bimînî
Hêj xweş bigerî li rû zemînî

Haḏir wî Bekir di ’erḏî rakir
Cismê bibela ji can cuda kir

Gava ku gehişte ser birayî
Nûrek wî nedî di wî çirayî

Tacdîn ji serê xwe tac û tomar
Havêtine ser leşê Memê jar

Dîn bû ji teḧessura birayî
Herçî ku didî wî ejdehayî

(Fil-ḧal)-i dikir ku wî fena ket
Teşbîhî Bekir di 'erdî raket

Qeṯ kes nedişê bibit muqabil
Bê şubhe bi wî dibûye qatil

Naçar-i xeber birin ji bo mîr
Mîr hat û li pê wî beste zincîr

Gava ku cenaze wan hilanî
Şahid ku ji meşhedê der anî

Meşhûd-i bûyîn li wan 'elamet
Rabû li xelaiqan qiyamet

Dêwê ku vebestî wan bi tedbîr
Bizdandî li ber xwe qeyd û zincîr

Zincîr û kemend ewî şikînan
Derwaze û perde wî hilînan

Ejder ji meх̌areyê ku ber bû
Derḧal-i bezî di ne'şê wer bû

Tabût-i li ser serê xwe danî
Efх̌an digihande asimanî

Hindî ku di şehrî ademî bûn
Têkda di libasê me˚temî bûn

Hindî ku hebûn di şehrî meşhûr
Xatûn û muxedderat û mestûr

Gîsû vekirin bi ṯayê terpoş
Ser ta bi qedem hemî siyehpoş

Bê me'cer û burqe' û serandaz
Reş girtî ji bo Memê bi dilxwaz

Neyyaḧe û mihreban û dayîn
Goyinde bi nale şubhî goyîn

Wan merḧiye istiran bi aheng
Zîn rabûye pê bi qameta şeng

Nahîdešifet li dengê sazê
Reqqaš-i diçû di ber cenazê

Dam û ded û ademî û mûran
Dar û ber û camid û tuyûran

(Bil-cumle) ji bo Memê dinalîn
Her yek bi meqamekê dikalîn

Telpê reşê wan siyahipoşan
Reh şubhetî ’ewrekê xurûşan

Ew çende ji ’aridêd-i gulgûn
Vêkra dewerîn sirişkê purxûn

Goya ku di feślê nûbiharî
Baran-i li gulşenan dibarî

Ev me˚tem û ev siyahipoşî
Ev çarşev û ev izar û poşî

Buhtan wî zemanî kirne ’adet
Bû resmê qedîm-i ta qiyamet

**Iltimas û istid'aya Zînê ye ji bo Bekirê mufsid ra**
**'udirxwahîya wê ye ji bo wî yê mulḧid ra**

Weqtê wekû çûne ser mezaran
Wan dî mirîyek di nêv du daran

Havêtine 'erdê şubhî murdar
Bê newḧeger û xudan û xemxwar

Pursîn 'eceb ev çi bênewa ye?
Gotin: Bekirê xudanceza ye

Tacdînî ji rû dinê fena kir
'alem bi fenayîya wî şa kir

Rawî wihe gote min ruwayet:
Zînê ku bihîstin ev ḧikayet

Ev rengehe gote mîr û Tacdîn
Ey şah û wezîr û 'izz û temkîn

Ez hîvî dikem neken 'inadê
Der ḧeqqê vî menbe'ê fesadê

Lewra ku Xudanê ins û canan
Wî xaliqê erḏ û asimanan

Roja ewî ḧubb-i da ḧebîban
Hingî ewî buẍḏ-i da reqîban

Mewcûd-i kirin dema ji me’dûm
Em pêkve di lazim û di melzûm

Em sorgul in, ew ji bo me xar e
Em genc in û ew ji bo me mar e

Gul hefẕ-i dibin bi nûkê xaran
Gencîne xudan dibin bi maran

J`ewwel ve eger çi wî cefa kir
Axir bi me ra ewî wefa kir

Ẕahir wî eger muxalefet kir
Baṯin bi me ra muwafeqet kir

Ger ew nebuwa di nêv me ḧail
’işqa me dibû beṯal û zail

Wî gerçi ji bo xwe ra xerab kir
Der ḧeqqê me wî qewî šewab kir

Ew bû sebebê ḧeqîqeta me
Daxil gerîya ṯerîqeta me

Ew jî di ṙiya me da şehîd e
Teḧqîq-i biken ku ew se'îd e

Zinhar-i ji meşheda ku Mem tê
Elbette ji merqeda ku em tê

Meḧrûm-i meken Bekir, emanet
Em bûyne bi wî šeyî šiyanet

Gava ku diçîne nêv še'îdê
Kelbê me bitin li ber wešîdê

Inšaf e ji bo xudanê inšaf!
Ayîne dibîtin ev qeder šaf!

Qeṯ mumkin e ab û abigîn e
Ev renge neket qebûlê kîn e

Ḧaşa ku bi ẍeyrî puxteyê 'işq
(Kella) ku siwayê suxteyê 'işq

Ev çende li šaḧibê cefayê
Ev renge kesek biket wefayê

Ev ṯaife merḧemetsurişt in
Lew laiqî ni'meta beḧeşt in

**Techîz û tekfîn û tedfîna Memê mehrûmê ẍemgîn e hemnefes û hemqefesbûna bi fewta Zîna nazenîn û ẍemrevîn e**

(Elqišše) şehîdê 'işqê cellad
Meqtûlê sitem qetîlê bêdad

Ew kuşteyê curmê bêgunahî
Teşbîhî beratê padişahî

Menşûr-i kirin bi nûrê pakî
Mestûr-i di nêv qubûrê xakî

Ew dur bi xezîneyê sipar in
Ew mar-i li ber piyan veşar in

Daynandine ber serî 'elamet
Ye'nî ev e serwerê qiyamet

Serxeylê qebîlê pakê bazan
Serdarê cemî'ê serferazan

Zîn hat û bi qameta šenewber
Bû serwê li ser wî sayeguster

Bê perde mitalê ney dinalî
Hêstir diwerîn ('elet-tewalî)

'eynî te digo di fešlê nîsan
Derya rijîya ji 'ewrî dîsan

Baran ku li turbeyê dibarî
Her dane dibûne deh mirarî

Her dem ku dikir ji derdê dil ah
Wan me°temîyan (ne'ûdû bil-lah)

Vêra bi newa digirtin aheng
Her neh felekan bi ser diket deng

Cundî û supahî û emîran
Derwêş û re'îyet û feqîran

Dildar û şepal û nazenînan
Ḧûrî û perî û ẍemrevînan

Vêkra dikirin hewar-i her kes
Efẍan digihane çerxê Eṯles

Zînê ku nema qiwam û quwwet
Nalî birîyan û ket ji qudret

Rûnişte li ber serê Memê jar
Mem kir bi tekellum û xeberdar

Kay malikê mulkê cism û canî
Ez baẍçe me û tu baẍiban î

Baẍê te gihandî bê xudan e
Bê rûyê te ew ji bo çira ne

Ev xal û xeṯ û ’uďarê gulzar
Ev ḧusn û cemal û baẍê ruxsar

Badamê siyah û çeşmê şehla
Nar û bih û sêvê şaxê bala

Xweş reng-i bilezzet û biṯam in
Bê şubhe li ẍeyrî te ḧeram in

Nexla bedena xwe raweşînim
Vî mêweyê cumle daweşînim

Van sunbul û laleyêd-i ẍerra
Reyḧan û binefşeyê muṯerra

Ye’nî ku ’uďar û zulf û xalan
Ya qenc ew e ez bidem bi talan

Manendî gulan libasî ker kem
Ax û xwelîyê bi ser xwe wer kem

Zulfan hemî ṯa bi ṯa bikêşim
Ḧeqqê min e ca bi ca biêşim

Ev baẍ û behar û berg û eẗmar
Enwar û şikûfe cem’ê ezhar

Ned̆ra neẕera te bûn bi carek
Weqfa bešera te bûn mubarek

Talan bikem ez ewan temamî
Da behre nexon ji wan çu ’amî

Lêkin xwe bi xwe dikem tešewwir
Belkî tu li min bibî teẍeyyir

Ev cez’e nebit li ba te meqbûl
Tirsim ku tu min bigêrî mes˚ûl

Terkîbê wicûdê cism û can in
Mulkêd-i te ne, ne bê xudan in

Nuqšan bibitin ji ḧusnê mûyek
Belkî ku bikey li min tu sûyek

Gava ku li min bikey ’itabê
Zanim ku neşêm bidem cewabê

Nêzîk e bibim wekî te medhûş
Ha weqt e di gel te bim hemaxûş

Laiq ew e ṯey bikem bisaṯê
Pakîze bibim ji ixtîlaṯê

Ya qenc ew e her bi vê cemalê
Azurde nekem qe zulf û xalê

Teslîm-i bikem emanetê ḧeq
Tefwîḏî te bim bi xeml û rewneq

Ev renge eda kirin ḧeqaiq
Bizdand-i ji 'alemê 'elaiq

Hembêz-i di merqedê weranî
Bêzar-i nema beden ji canî

Destê xwe bi dil ji canî şûştin
Goya ku şemal bû, vekuştin

Rûḧa xwe şihande pêş-i Barî
Cismê xwe sipare wî mezarî

Wan me˚temîyêd-i dilbirîndar
Tekrar-i ji nû ve kirne hawar

Efxan-i ji canê ḧadirînan
Feryad-i nihad-i nazenînan

Sê roj û şevan ji ferşê xebra
Peywest e diçûne 'erşê e'la

Ḧetta wekû Zîn bi resm û ayîn
Techîz-i kirin wekî dizanîn

Leḧda ku Memê melek nezer tê
Ye'nî šedefa ku ew guher tê

Ew çende li ser girîn bi zarî
Baranê sirişkê lê dibarî

Ew çende li ser bûyîn guherbar
Ser lê vekirin ji nû ve tekrar

Ew her du guher di durcekê da
Ew şems û qemer di burcekê da

Bê wasite wan kirin muqarin
Bê fašîle ew bi hev siparin

Ḧašil vekirin ji nû ve šindûq
Mîr gote Memê: Ji bo te me'şûq

Sê car-i ji qalibî šeda hat
Awaz-i bi lefzê (merḧeba) hat

Hemyan ku bihîste sirrê teḧqîq
(Bil-cumle) kirin bi 'işqê tešdîq

Teḧsîn û sed aferîn ji wan ra
Qet meylê dinê nebû bi wan ra

Alûde nebûn bi xak û xaşak
Ev bû eẗera meḧebbeta pak

Pakîze û pakibaz-i ew çûn
Dûşîze û serfiraz-i ew çûn

Lebteşne û ber ji hev nexwarî
Ḧesretzede çûne pêş-i Barî

Xweş 'eyş-i kirin bi 'işqê (Wellah)
Xweş pêkve mirin (tebarekel-lah)

Herçî bi ciwanî şubhî Zînê
Tebdîl-i biket bi 'işqê jînê

Ya miẗlî Memê bi 'işqê ser det
'eyş û xweşîyê li rê bi der det

Elbette muradê dê helînit
Herçî ku îradetê bibînit

Ya Reb bi kelalê ’işqê šadiq
Ya Reb bi kemalê šidqê ’aşiq

Ya Reb bi şirînîya cemalê
Ya Reb bi evînîya celalê

Ya Rebbî bi derdê hecrê cangah
Ya Rebbî bi đewqê wešlê dilxwah

Ya Reb bi ḧelaweta ḧebîban
Ya Reb bi ’edaweta reqîban

Ya Rebbî bi nazê nazenînan
Ya Reb bi niyazê ẍemguzînan

Ya Rebbî bi avê çavê bulbul
Ya Reb bi xunavê navê sorgul

Ya Rebbî bi eşkê alê Mecnûn
Ya Rebbî bi rûyê Leylê gulgûn

Ya Reb bi Memê û vê evînê
Ya Reb bi teḧessura li Zînê

Weqtê ku cuda dikey ji canî
Bê behre nekey ji 'işqê Xanî

Ye'nî ji wilayeta Muḧemmed
Meḧrûm-i nekey tu ya Reb Eḧmed

Çava ji nubuwetê bi qal e
Meṯleb ji wilayetê meḧal e

Da°im ewî guftûgo wela ye
Lêkin ewî cust û cû bela ye

Qewlêd-i wî ser bi ser guzaf in
Fi'lêd-i wî (cumleten) xilaf in

ẕahir ji we ra selîse guftar
Baṯin bi we ra xebî'e kirdar

Manendî Memê ewî mirincan
Teşbîhî Bekir bibexşe qencan

## Teswîlê tefawit û ixtilafê xilqet e
## temsîlê teqadayê siriştê tînet û fitret e

Ḧikmet ew e, ew ji darê dunya
Çûn seyr-i kirin serayê ’uqba

Wan terk-i neda cibilleta xwe
Her yek xuliqîn di xilqeta xwe

Ye’nî ku li ser Memê û Zînê
Şîn bû ji zira’eta evînê

Riskîn du ’eded nihalê serweş
Rabûn bi hewa ve her du serxweş

Yek serwisihî û yek šenewber
Ser sebzeletîf û saye guster

Wan dest-i di gerdenê di yek ra
Qedda xwe dirêj kirin bi yek ra

Şîn bû ji ewî berê ji xêrê
Darek li qiyafeta kinêrê

Ew dar-i ji raḧetê berî bû
Manendê xudanî b′istirî bû

Rabû xwe gihande herdu daran
Bû mani'ê wešlê herdu yaran

Raḧet neşê wî biket mudara
Xešmaneyê kir wî aşikara

Dîsan xwe gihande wan ḧebîban
Ew lê biçiya wekî reqîban

Ḧašil li furû' û ger ušûlan
Ew lê fetilî wekî fuḏûlan

Xelqê ku bi ešlê bed sirişt in
Ew ešl-i ji wan qe tête şuştin

Çil salî tu ḧenẕelê biçînî
Sed av-i bidey bi hingivînî

Perwerde bikey bi afitabê
Her dem bireşînî lê gulabê

Her roj-i reha wî lê bi ker key
Wê fašileyê tijî şeker key

Xidmet bikerî tu hindewane
Ew bo te dibîtey hindewane?

Da fikr-i nekey dema ku ber dit

Ew ẍeyrî ji ṯeḧlîyê ẗemer dit

**Miẗalê serencamê benî-adem û mal e**
**ne bi ḧeseb z̲ahirî bi šûretê ḧal e**
**belkî mute'elliqê bat̲inê me'na û mewqûfê miẗliyetê (Ḋul-celal) e**

Agah-i ji ḧalê dewrê eyyam
Ev rengehe gote min serencam

Go: Pîrekê mihridarê 'aşiq
Qewlê wî ji rengê šubḧê šadiq

Weqtê wekû ew dibû muraqib
Rûḧa wî dibû bi cismî ẍalib

Esrar-i dibûn li wî diyarî
Nêçîr-i dikir li 'erşê Barî!

Ẍalib ku dibû ji 'alema gil
Ẍaib ku dibû li 'alema dil

Qelbê wî ji sirrê lewḧê meḧfûz̲
Her leḧz̲e dibû bi keşfê meḧz̲ûz̲

z̲ahir ku dibûn ji wî keramat
Ageh dikirin xudan meqamat

Wî pîrî bi xewn eger bi ilham
Ev rengehe kir ḧeqîqet i'lam

Go: Çûme diyarê baẍê Riḏwan
Min dî du hezar-i ḧûr û ẍilman

(Bil-cumle) di qešrekî 'emeldar
Ew qešr-i butun ji durrê şehwar

Yek şubhî Bekir bi tac û binper
Westaye li ber derî muqerrer

Cewganekî ḧeyzeran di des bû
Emma mi nizanî ew çi kes bû

Min gote wî: Ey xudan meratib
Aya tu xudan î yan tu ḧacib?

Go: Şeyx-i, tu ma nizanî kî me?
Ez ew Bekirê ku qapuçî me!

Ez muşterikê Memê û Zîn im
Lew lêrehe asitannişîn im

Ev qešr e ku heşt ṯebeq 'eyan in
Yek ya min e ḧeft ṯebeq di wan in

Ez lêre emîn û destbidar im
Lêkin di vî mulkî huššedar im

Herçende bi şeklî pasiban im
Emma bi mekan şerîkê wan im

Min gote wî: Ey nikûserencam
Wadiḧ bike bo me ḧalî i'lam

Herçend kerema Kerîmî 'am e
Barî bi çi da te ev meqam e?

Go: Şeyx-i, tu hêj nebûyî 'arif
Emma di dinê tu bûyî waqif

Ez ger bi xeber reqîbê wan bûm
Lêkin bi neẕer ḧebîbê wan bûm

Min ew ji dinê bi paş ve kêşan
Mu'tad-i kirin bi derd û êşan

Xweşyêd-i dinê li wan bi der dan
Munqad-i kirin bi daẍ û derdan

Ew çende me dane wan siyaset
Ḧetta wekû bûn xudanriyaset

Lewra me li ḏerrê wan xeber da
Ḧetta ku serê xwe tê bi der da

Ev herdu cihan bi hev hewî ne
Ev d̲erre li d̲errê hev qewî ne

Ḧetta wekû ber nedey tu yêkê
Nabînî çu led̈d̈etê ji yêkê

Ew d̲erre bi wan me daye berdan
Kêşane bi asiman ji ’erdan

Min dayiye wan butun beḧeştek
Wan dayiye min ji baẍî xeştek

Şeyx maye li guhtina wî guhdêr
Go: Ey şeqîyê te ’aqibet xêr

Tacdîn ku tu kuştî bê cinayet
Barî bi wî ra çi kir ’inayet?

Go: ’efw-i kir ew cenabê Barî
Bû cennetî û neçûye narî

Xellaqê xerabî û xebîẗî
Bexşîne wî cennetî nivîsî

’alem ku bi dest xerabîya min
’aciz kirî bû fesadîya min

Kuştim wî ji bo niẕamê ’alem
Bo raḧetîya ’ewamê ’alem

Ẕahir wî eger çi kir qebaḧet
Baṯin bûwe raḧet ew qebaḧet

Şolin hene (ẕahiren) xerab in
Fi’lin hene (šûreten) šewab in

Yek ’edl e li šûretê cefayê
Yek qehr e di kiswetê wefayê

Lê perdekeşê rumûzê ḧikmet
Bê sir nekir ew kunûzê qismet

Tewzî’-i nekir li ’amê xašan
Mexšûš-i wî da nedîm û nasan

Ew sir wî nekir ji bo me me’lûm
Hin muḧrim in û hinek di meḧrûm

Sed şukr-i ez ê xerab û Tacdîn
Meḧḏa bi te’elluqa Mem û Zîn

Meḧrûm-i nebûn bi pur gunahî
Bûn meẕherê reḧmeta îlahî

Ey dost-i bi dil be yarê qencan
Ya qenc-i bibe tebayê qencan

Ew qenc in û qencîyê dizanin
Ew ẍeyrî ji qencîyê nizanin

Hindî ku bikey bi wan cefayê
Ew dê bigerin bi dil wefayê

Zinhar! Tu mebe muḧib xeraban
Ney dost û ne dujminê kilaban

Ger dost-i bî dê biken te murdar
Wer dujmin î dê biken birîndar

Ev himmete xašê 'aşiqan e
Ev mertebe rahê šadiqan e

Xelqê ku wekî Bekir şeqî ne
Fi'lêd-i wî cumle naḧeqî ne

Yan şubhetî Tacidîn di cebbar
Qettal û dilawer û cegerdar

Me'fû biketin kerameta wan
Meẍfûr-i bibin ji himmeta wan

Teqwiyetê wan bibit mededkar
Teb’iyetê wan biket sizawar

Ev remze ḧeqîqeta leṯîf e
Iď’an bike nukteyê ẕerîf e

Iď’an bike mes˚elê muderris
Texmînê mesaḧetê muhendis

Dujmin ku ji ’işqê behrewer bin
Bes dost-i çi reng di mu’teber bin

Ev renge te’elluqa reqîban
Bes çende tefewwiqa ḧebîban

Xasma ku muḧib bibîte meḧbûb
Ew ṯalibê ḧeq bibîte meṯlûb

Ḧeqqa ku tenê wî ḧeq dizanit
Qeṯ ẍeyrî wî kes bi ḧeq nizanit

**Iẗbatê xewaš û kemalê çewherê ’işq e ku kîmiyayê ekber û kibrîtê eḧmer e ji bo xudanî**
**lewra behîme û durinde û şeyṯanîyê dikete melek di nefsa insanî**

Ey mustemi’ê miẗal û teswîl
Wey muctehidê qiyas û te°wîl

Xanî ku ji camê ’işqê dîn bû
Ew şoreşerab-i pê şirîn bû

Ew çend-i vexwar ewî nehişyar
Agahî nema ewî ji guftar

Mestane ye ew bi keyfê me°mûr
Dîwane ye ew bi ’urfê meẍdûr

Mexmûr e û badenoş û serxweş
Lew badefiroş e û muşewweş

Herçî ku dibêjitin hewa ye
Ger guh bidinê newayê nay e

Ew ney ne ḧelal û ne ḧeram e
Bê perde ye lê ne bê meqam e

Kurdî, ’erebî, derî û tazî
Terkîb-i kirin bi hezl û bazî

Hindek ji fesaneyêd-i Buhtan
Hindek di behane hin di buhtan

Buhtî û Mihemidî û Silîvî
Hin le'l û hinek ji zêr û zîvî

Xermuhr e û morik û mirarî
Hindek di şefaf û hin di t̠arî

Teršî'-i kirin wekî biçûkan
Înane bi qeyšerî û sûkan

Hin qišše û hin ji wan miẗal in
Hindek di ȟeram û hin ȟelal in

Her qišše ji ȟišše behremend in
Her emẗile ger bizanî pend in

Lêkin wî ẍered̠ ji guftugoyê
Meqšûd-i ji hinde cust û coyê

Z̠ahirkirina cemalê 'işq e
T̈abitkirina kemalê 'işq e

'işq ayîneyê Xuda numa ye
Xurşîdišifet xudand̠iya ye

Ẍafil mebe 'işqê (fil-ḧeqîqe)
Ey rahirew (eqrebul-ṯerîq) e

Xweş cewher e cinsê kîmiya ye
Qedrê wê bizan giranbiha ye

Ṯeb'ê di ku šifr û bê cela ne
Qelbê di ku qelp û ya qela ne

Ev cewhere wan diket muṯella
Ev šeyqele wan diket mucella

Herçî ku kesek biket îrad e
Ya 'işq-i murîd e ya murad e

Ayîneyê 'eksê bêmiẗal e
Gencîneyê sirrê bêzewal e

Kes nîne ji 'işqê bêeẗer bit
Mumkin ku ji ḋewqê bêxeber bit

Her kes bi qiyasê himmeta xwe
Dê šerf-i biket îradeta xwe

Lê ekẗerê 'amîyan nezan in
Nefsa xwe ji bo xwe ra nizanin

Nabaliẍ û ebleh û sefîh in
Ya zahid û šûfî û feqîh in

Ew cahil û ummî û sifîl in
Bê murşid û rehber û delîl in

Naçar-i dibin li ’işqê bai’
Neqdê xwe diden bi ȟusnê ḏai’

Hin šerf-i diken bi ’eyşê dunya
Hin pê dikirin serayê ’uqba

Ev herdu celeb dibin ziyankar
Meȟrûm-i dibin ji ďewqê dîdar

**Beyanê meratib û medaricê sulûk û wišûlê (îlel-lah) e**
**û merasimê fenayê (fîl-lah) û beqayê (bil-lah) e**

Saqî, were bêje min çi lewn e
Ev kewn-i xiyal e yan di xewn e?

Te’bîr-i meke ku ew beṯal e
Tešwîr-i meke ku ew xiyal e

Axaz-i eger çi reng ḧeyat e
Encamê ḧeyatê wî memat e

Ye’nî ku wucûd e bê wucûd e
Xweş xilqet e ḧeyf-i bê xulûd e

Eflak û ’enašir û mewalîd
Exlaṯ û ṯebai’ û meqalîd

Vêkra di (bedî’ul-iştirak) in
Têkda di (serî’ul-infikak) in

Ser rişteyê gewhera beqa ne
Sermayeyê ’illeta fena ne

Hindek di ẗeqîl û hin xefîf in
Hindek di xefî û hin leṯîf in

Herçende ji bo me ešl û bîx in
Her çar-i ji bo me axişîx in

Agir vemirit, hewa hewa ye
Av er çikîya, heba heba ye

Eflak-i miẗalê asiyab in
Hemware bi çerx û inqilab in

Dexlê li wî aşî ademî ne
Met̲mûreyê erd̲î ardelîn e

Ew dane bi newbet û tewalî
Daim dirijin ji dev çewalî

Herçî rijîya dibit mucezza
Jêkra dibitin dibin muherra

Texmîr-i diken ji nû ve tekrar
Ew qalibê qelb e (qabil-unnar)

Ew çende dikêşin ew siyaset
Rad̲î ne bi merteba necaset

(Fil-cumle) ne murde û ne eḧya
Ber mucibê (la-yemût û yeḧya)

Illa ku nefîs û paketînet
Ye'nî ku nufûsê nîkesîret

Dihqan bi xušûšiyet helînit
Wê daneyê (xaššeten) biçînit

Ḧetta nerizit hilak-i nabit
Nariskit û qenc-i pak-i nabit

Weqtê risiya û bûye xûşe
Wê dê biqutin ji bûyî tûşe

Aşê dev û çeqçeqa zebanan
Ava dehen û berê didanan

Ew çend ewî dev diden dihêrin
Ew çende di şehrê ten digêrin

Ew çend diqutin wê ev 'emeldar
Ḧetta wekû hûr bibit wekî ar

Ḧašil ku ji paşî wan cefayan
Dê bête tešerrufa quwayan

Geh cad̈ib e batinî vekêşit
Geh masik e bigvişit biêşit

Dem haḏime bît ewê biket heḏm
Dem dafi’e bît ewê biket keẕm

Tennurê me’îde wê bipêjit
Herçî ku xerabe jê birêjit

Teš’îd-i biken heçî leṯîf e
Tenzîl-i biken heçî keẗîf e

Paşî ji wê elṯefê cuda ken
Temyîz-i bikin ji hev bela ken

Ṯebbaxê ḧerareta ẍerîzî
Šebbaẍê mumeyyizê temîzî

Tewzî’-i biket li cism û e’ḏan
Me’mûr-i bibet cihat û erkan

Dîza ciger û dilê zucacî
Teqṯîr-i biken meya mizacî

Ḧašil ’ereqa meya ḧeyatê
Teqṯîr-i ku bû wekî nebatê

Hêja ji ẕuhûrê van şu˚ûnan
Bû qalibê ’alema buṯûnan

Geh ẍewṯê dixut di beḧra maᵒê
Rengîn dibitin demek dimaᵒê

Dem ’eqd-i dibit ji boyî terkîb
Teŝwîr-i dibit bi nez̠m û tertîb

Terkîb-i ku bû miẗalê mercan
Bû ’eks-i pidîrê pertewa can

Ew can çi ye? Muhceya nebatê
Ew muhce ye menşeᵒa ḧeyatê

Hindî wekû sakinê buṯûn e
Xamûş e û xwarina wî xûn e

Weqtê ku ji mezre’ê xefayê
Ew sebzeyê ter biket numayê

Wî sebzeyê dem bi dem bixûnê
Dê av-i biden ji paşî bûnê

Baran ne ji feyd̠ê bit mededkar
Ew dane dibîte nexlê bêbar?

Sersebz-i dibit ji berg û yaran
Ger lê biwerit ji feyd̠ê baran

Ew sebz-i ku bû nihalê serkeş
Serxweş gerîya ji mêweyê xweş

Ew mêwe dema giha kemalê
Bû mezhera pertewa cemalê

Ger laiqê ’izzeta emîr e
Wer derxurê ĥedreta Qedîr e

Wê heldigirin ji bo dîyarî
Bê wasite wê diben diyarî

(Fil-ĥal)-i ku çû dibîte meĥbûb
Navê wî li wî dibîte mecđûb

Ev nexle ne (wafirul-furû’) in
Lê zêde di (nadirul-wiqû’) in

Wer mayî wisan li ber hewayê
Ew dê çite me’šera cefayê

Lazim ew e perweşê bibînit
Terbiyyetê derxuriş helînit

Geh puxte bi afitabê şer’ê
Geh suxte bi mahitabê wer’ê

Gava pijîya giha kemalê
Weqta rijîya ji ser nihalê

Ḧetta nekevit ji ewcê ’izzet
Ḧetta negehîte xakê đillet

Ew nabite salikê t̠erîqê
Wê nabene me’šera ḧeqîqê

Ev rengehe dest bi dest bi rê ve
Ew mertebe mertebe bi wê ve

Ew mêwe bixut kemalê d̠erbet
Ew luqmeyê xweş bibîte şerbet

Ew şerbet eger şirîn e xam e
Wer t̠eḧl e û t̠irş e natemam e

Ḧetta ne bi destê pîrê meyxwer
Ew hilkelitin di xummê ekber

Gava ku di wê ve kel bi ser ket
Weqtê ji xumê mezin bi der ket

Ye’nî ku ji keẗreta šifatan
Ew t̠ey biketin tecelliyatan

(Elqišše) ji germîya cemalê
Ḧašil ku bi şewketa celalê

Cewher ku temam-i mud̲meḧil bit
Teşbîhî 'ered̲ ku munfe'il bit

Germiyetê wan tecelliyatan
Wan muḧriq û wan muqewwiyatan

Tenzîl-i biken ji wê x̌ubarê
Teš'îd-i biken ji wê buxarê

Xališ ku bibit ji paşî teš'îd
Hêja diçite meqamê tecrîd

Cewher ji 'ered̲ ku bû mucerred
Datînine bûteyê mucedded

Ew bûte eger çi tengina ye
Šeḧrayê fenayê dilgeşa ye

Hemrengî suraḧî û piyale
Hindî wekû sor e ya ne al e

Hêja nebûye reḧîqê mextûm
Hêja neçûye meqamê me'lûm

Hindî ji xwe wê hebit wicûdek
Nînin ji Xudê ewê nimûdek

Bê meşrebeyê wefayê şahî
Ew naçite meşreba îlahî

Fanî nebitin fenayê mutleq
Nabînitin ew beqayê (bil-ḧeq)

Fanîtî ji bo wî ra beqa ye
Baqîtî ji bo wî ra liqa ye

Emma ne bi ittišal û ilḧaq
Belkî ku bi infišal û itlaq

Ev reng-i diket muradê ḧašil
Înca dibite murîdê wašil

Ya Reb çi dibit ji ber me koran
Carek tu vedî ḧicab û toran

Bînende bikey emêd-i ’aciz
Bê perde û bê ḧicab û ḧaciz

Deryayê yeqîn biket temewwuc
Em jî bikerîn demek teferruc

Ev z̲enn û guman û ’ilm û teqlîd
Tebdîl-i bibin bi ’eynê tewḧîd

Esbab û wesîle qet̲ nemînin
Carek ne musebbibî bibînin

Îman me heye bi ḋatê wacib
Imkaniyeta me bûye ḧacib

Dîsan ji me her tu me xelaš ke
Ya Reb me ji bo xwe ra xewnas ke

Ev seyr û sulûk û t̲eyyê menzil
Mexšûš e ji bo murîdê muqbil

Kengî ji me ra dibit muyesser
Xaliq ji ezel neket muqedder

Lewra ku xerabî û qebûlî
Nînin bi fed̲ail û fud̲ûlî

’abid bi riyayekê hilak in
’ašî bi du’ayekê di pak in

’alem ku wekû xiyalê z̲ill e
Šani’ bi xwe hadî û mud̲ill e

Ew tîninte menẕera xiyalê
Ew têxite perdeya ḏelalê

Lê daye me cuz°ê ixtiyarî
Nefsa me bi lêb û ḧîlekarî

Ew jî biriye ji dest me naçar
Em mane û luṯfê Ḧeq mededkar

Bes qenc-i ji bo me 'amîyan ra
Her ev bes e bo me 'ašîyan ra

J'ewwel ve Xudê bi ḧeq binasîn
Herçende qušûr û kêm û kasîn

Paşî bi dilê xwe jê bitirsîn
Dînê xwe ji 'aliman bipirsîn

Çawa ku dibêjin em wisa bîn
Ḧetta ku ji rû dinê wefa bîn

Pala xwe bideyne luṯfê Barî
Belkî me bibexşitin ji narî

**Xatemîya kitab û nameyê di šûretê xiṯaba di gel xameyê herçende ẍereḏ xetimê kelam e lakin li mutekellimî ibham e**

Ey rakibê waqi'ê peyade
Wey 'aşiqê šefheyêd-i sade

Ey şa'irê šaẍir û nigûnser
Wey saxir û saḧirê fusûnker

Ey haimê wadîya ḏelalê
Wey ẍawîyê de'weya kemalê

Ey xameyê serteraşê bedreng
Bes nameyê xweş qumaşê xweşreng

Rûreş ke bi navê xeṯṯ û xalan
Bednam-i bike bi Bê û Dalan

Hindî wekû xeṯ ẍubar û hûr e
Ew xeṯ ji leṯafetê te dûr e

Gava ku ji rengê meşqê pur bû
Ya şubhetî nesx û ẗulẗê gir bû

Ew nasixê nusxeya cemal e
Bê rewneq û ruhnî û keaml e

Lazim ew e dilberêd-i sade
Xet̲ lê nebitin wekî qilade

Xweş zînet e xet̲ li mahê ruxsar
Hindî li rûyan nebûye hevsar

Ey xame te jî gelek dirêj kir
Ev name bese te pur qirêj kir

Herçende kelam-i şubhî dur bit
Bê qedr-i dibit dema ku pur bit

Nabînî bi qîmet in cewahir
Lewra ku di hindik in di nadir

Sehw û xelet̲ û xet̲a û nisyan
Mecmû’eyê napesendê ’išyan

Teḧrîr-i kirin te bê te˚emmul
Kî dê biketin ji te teḧemmul

Kes nîne biket ji bo te teḧsîn
Goyendeyê aferîn û nifrîn

Ey bêedeba xerabe bê’ar
Gustax û sitemker û siyehkar

Hindî ku serê te min qelem kir
Ew çend te xeṯê xeṯa reqem kir

Hindî ku serê te min teraşî
Ew çende te kir guneh telaşî

Feȟḧ̆aşî te kir ji rengê Xanî
Neqqaşî te kir miẗ̆alê Manî

Meşxûlî bese bi le'b û lehwan
Tewba xwe bike j`xeṯa û sehwan

Carek were ser ṯerîqê tewbe
Hindî negehiştiye te newbe

Newbet ku gehişte xešmê xam e
Ṯey kir li me ew niza' û name

Ew beṯlê dilawerê zeberdest
Ewwel kemera tehewwurê best

Bû rakibê duldilê enamil
Derȟal-i di gel me bû muqabil

Kêşa ji zebanî ḋulfiqarek
Bû xešm-i di gel me şehsiwarek

Axir li me hatiye ’itaban
Ezman gerîya li wan cewaban

Go: Eḧmed, eger tu ney xebîï î
Herçî ku te go min ew nivîsî

Qewlêd-i te qenc, eger xerab in
Fi’lêd te xeṯa, eger šewab in

Ey bed’emelo, tu qenc dizanî
Tû qail û fa’il û xudan î

Ney bûm ez di ’alema neyistan
Mey bûm ne bi destê meyperistan

Gava ku te ez birim ji sazî
Ney dengê di min hebû ne gazî

Te dûr-i kirim ji nik hevalan
Mehcûr-i kirim ji mulk û malan

Bend û wešilêd-i min serabun
Ewwel te kirin bi emrê (kun) kun

Paşî te dikir di baẍê ’işqê
Kun kun dilê min bi daxê ’işqê

Te pif kire cismê min dema can
Hatin ji dilê min ah û efẍan

Nefxa te li min dil û ceger sot
Herçî ku te pif kirî min ew got

Ez lal im û bêzeban û xamûş
Bê nefs û nefes ji rengê qamûş

Bezma ṯerebê bi min te xweş kir
Dîwanê guneh bi min te reş kir

Herçende ku ẕahirî bibim ez
Sazende tu yî wekî ney im ez

Ma ney bi xwe tiştekî dibêjit?
Xame bi xwe reşḧekê dirêjit?

Katib qelemî diket siyehkar
Sazende ye ney ji dest bi hawar

Nay û qelem û šeda we kêşan
Tîr û hedef û keman û nîşan

(Meḧkûmun-'eleyhî) bûn di teqdîr
Hêj ismê guneh nebûyî tesṯîr

Ya Reb tu dizanî Xanîyê jar
Teşbîhî bi xameya giriftar

Qelbê wî di dest te daye Elḧeq
Destê wî di dest xwe nîne mutḻeq

Gava ku li wî te ser qelem kir
Herçî te îrade kir reqem kir

Amir tu yî ew bi emrî me°mûr
Me°mûr-i dibin hemîşe me'dûr

Ger dayiye wî te ixtiyarek
Ew jî we sipare te bi carek

Ew ger 'edem û weger qelem bû
Peywest e di dest te serqedem bû

Nef' û ḏerera xwe ew nizanit
Ya qenc-i ji bo xwe ra çi zanit

Çawa ku ji bo te ra riḏa ye
Ew neyšifet e wî ew hewa ye

Wellah ji sefîdî û siyahî
Wî qešd û xereḏ tu yî îlahî

Emma bi murekkeba qebaiḧ
Rûreş kirine gelek šefaiḧ

Xettê bi te sernewişt û sermeşq
Sih sal e xetê xeta diket meşq

Lewra ku dema ji ẍeybê fek bû
Tarîx-i hezar û şêst û yek bû

Îsale gihişte çil û çaran
Wî pêşirewê gunahikaran

Vêkda ji menahîyan gelek mal
Yek pûl-i nehin ji ḧusnê e’mal

Ewwel ku te da ji ’işqê metle’
Axir bide wî tu ḧusnê meqte’

Li ba te muḧeqqeq bitin ev cewab
Duhî gote min hatifî bêḧicab

(Se eḧmed ẗenake bi qewlin šeḧîḧ)
Li tewhîdê Barî (bi lefẕin fešîḧ)

Xudê êk e bê hevrê-y û bê heval
Ne me’zûlî ye ne mirin ne zewal

Ne ešl û ne fešl û ne da û ne bab
Heye û heyîna wî nabit ḧisab

Ji bo wî çu nînin cihat û mekan
Ne manend û miẗl û ne hemṯa nişan

Mekanan mebîne ji bo wî rewa
Nihayet (’ele-l’erşî qed istewa)

Li wî raneborîne weqt û zeman
Ne sal û ne mah û ne ḧîn û ne an

Ebed dê hebîtin ezel her heye
Di dunyê û ’uqbê xudanê me ye

Ewî afirandin em û cumle xelq
Nehin ẍeyrî wî, qeṯ çu xaliq bi ḧeq

Resûlêd-i wî cumle ḧeqq in temam
Xušûšen Muḧemmed ('eleyhîs-selam)

Ku serdefterê cumle 'alem ew e
Nubûwwet xwe mektûb e xatem ew e

Xudê afirandin ji bo wî felek
Ji bo xizmeta wî şehandin melek

Ku Qur°an ji 'erşan di gel wî hinar
Ji boyî ḧebîbê xwe yê ixtiyar

Ji bal xwe buraqek ji bo ra şehand
Li zînek murešše' ewî rûnihand

Buraqê di gel refrefê dest bi dest
Bi emrê Xudê ew birin pêşî dest

Di ḧeft asimanan ewî ew perand
Bi qasî du qewsan vi bal xwe gehand

Helanîn Xudê perde rakir niqab
Cemala Xudê dît ewî bê ḧicab

Du caran bi çavan cemala wî dît
Li d̲erra melayêd dibêjin nedît

Mebe bê sebeb munkirê (qed re˚a)
Ji xelqê (tumarûn ’ela ma yera)

Eger tu dibêjî: Li kû dî Xuda
Xudê ku li nik (Sidretul-munteha)

Muḧeqqeq bizan wî Xudê dîtiye
Nihayet nizanit ḧeqîqet çi ye

Ji boyî ku nînin ji bo wî şebîh
Kesê wešf biket dê çi bêjit bedîh

Šifatêd-i seb’e ji bo (Ḋul-celal)
Bizan ḧeft in ey ’arifê (bul-kemal)

Xweşî, şîn û zanîn û vîn û kelam
Bihîstin, di gel dîtinê bû temam

Qedîm in wekî ḋatî cumle šifat
Ne ’eynêd-i ḋatî ne, ne ẍeyrê zat

Xudê nîne cewher ne cism û ’ereḏ
Ne kull e ne be’ḏ e bizan bê ẍereḏ

Eger bê guneh me mu’eḋḋeb biket
Ji bo wî heye me mu˚eddeb biket

Rewa ye biket ew li ’ebdî meşaq
Bi qehra xwe teklîfê (ma la yuṯaq)

Ewê kê bi ẕulmê tekelluf diket?!
Di mulkê xwe da ew tešerruf diket

Li me ferḏ e herçî ji bo wî bi kêr
Ne ferḏ e li wî ya ji bo me bi xêr

Iradet diket ew bi xêr û şeran
Riḏa nîne emma bi fi’la şeran

Bizan bende muxtarê fi’la xwe ye
Ne xaliq, ne mecbûrê fi’la xwe ye

Muwafiq nebin qewl û niyyet ’emel
Li ba me dibîtin ku îman xelel

Mirovê biîman di dojê muqîm
Bizane ku namînitin ey ḧekîm

Musilman bi qetl û zinayê çu car
Ne kafir dibin ne muxelled di nar

Ji me’šiyetan wacib e tewbe zû
Guneh nîne tewbe nebîtin li dû

Ne me’đûr e cahil ku ’aqil bitin
Ji xaliq bi cehla xwe ẍafil bitin

Mirovê nezan bît û nadan û sist
Dibîtin bi teqlîdê îman durist

Di weqtê ’eđaba Xudê ket nizûl
Bi ser kafiran nîne îman qebûl

Ji ’ezl û gunahan nebî bûn berî
Ji bo qismê jin nîne pêẍemberî

Welîyan keramet diken jê z̲uhûr
Diken xerqê ’adet gelek jê šudûr

Xudê dê bibînin musilman bi çav
Wekî šayî bîtin heyîva tevav

Ji bîr dê biken ni’meta cennetê
Wekî dest bidet dewleta ru˚yetê

Bet̲al e tenasux muḧal e ḧulûl
Meke ittiḧada du tiştan qebûl

Eger tiştekî pur mucezza biken
Qebûl naket êdî tecezza biken

Heyûla çu nînin ’edîm e ’edîm
Dinê kafir e yê dibêjit qedîm

Meke lec di Luqman û Eskenderî
Ji bo wan ne me’rûf e pêẍemberî

Yezîdê mirî le’netê lê meke
Pelîd û xebîs e xwe têkil meke

Mela°ik, şeyaṯîn û cinnan wucûd
Heye da nekey bûyîna wan cuḧûd

Wekî êk in ev herdu bê şek temam
Di rizqiyyetê da ḧelal û ḧeram

Bibêjim te feḏla šeḧabêd Resûl
Bi can pê ke bawer bi dil ke qebûl

Ebûbekirê šiddîq e yarê şefîq
Ew e (ťanî iťneyn) di ẍarê refîq

Ji ewwel di feḏlê seramed ew e
Kerîm e û šaḧib keramet ew e

Li pê wî bi ḧeq ’Umer e dînpenah
Bi fetḧêd-i wî şane xundkar û şah

Xilafet kemer bû micala wî best
Ji ḧukmê wî pişta muxalif şikest

Di pê wî ve ’Usman bi ḧeq bû ḧekîm
Di ’ilmî ’elîm û di ḧukmî ḧelîm

Ji Kerrarî efd̲eltir e bê guman
Ev e i’tiqada me der ḧeqqê wan

Li pê wan ’Elî šaḧibê (Ḋul-fiqar)
Siwarê li Duldul şehê namidar

Tefewwuq li ser yêd-i mayî heye
Bi me’na birayê Resûlê me ye

Şefa’et diken enbîya ewlîya
Bi iďna Xudê bo kesê eşqîya

Di ẍeyb û ḧud̲ûrê du’ayan eẗer
Dibîtin ji bo ra (eya ba xeber)

Bi fi’lêd-i qenc da nekey minnetê
Bi fed̲la Xudê dê biçî cennetê

Beḧişt û cehennem heyin wê demê
Fena nabin ew naçine ’edemê

Yeqîn dê bibîtin di (Yewmul-qiyam)
Ḧisaba ḧelalî 'eďaba ḧeram

Ji bo ehlê xeyran necat û riḏa
Ji bo ehlê şeran 'iqab û ciza

Di qebrî dibîtin ji xelqê mirî
Su'ala Nekîrî di gel Munkirî

Di ḧeşrê terazû û mîzan heye
Xerabî û qencî û kêşan heye

Širaṯ ew pira pur bi xewf û xeṯer
Cemî'ê xelaiq diken lê guďer

Cehennem di bin da û cennet li pêş
Li ser wê, Îlahî, tu destim bikêş

We ger ne, ez ê mucrimê bed'emel
Dizanim ku dê bête pê min zelel

Bi fi'ilêd-i min ya Îlahî nekey
Di gel min bi iḧsan û luṯfa xwe key

Min û cumleyê ummeta Mušṯefa
Bibî cennetê tabi'ê Mušṯefa

**Neqqaşê ezel**

Neqqaşê ezel roja ser lewḧeyê rengîn da
Pergar-i ji destan bû, seršefḧe ku tezyîn da

Teḋhîb û zerefşan kir ser lewḧê kitaba ’işq
Resma ezelî kêşa, neqşê xwe nû ayîn da

Dîbace ku inşa kir, fihriste ku imla kir
Cildek ji ’enašir best, nefxek bi sufalîn da

Et̲falê melek hatin westane dibistanê
(La ’ilme lena) gotin, (ebced) bi xwe telqîn da

Wan saderuxan meşqê ’işqê ku temenna kir
Xet̲t̲at̲ê ji ḧusnê xet̲ sermeşqekî zêrîn da

Ez çûme derê dêrê, min dîte ku (rûḧullah)
Tekrarî mušewwer bû ḧetta di nihalîn da

Wan cumle (enel-ḧeq) got, min waḧidê mut̲leq got
Saqî bi xwe ez girtim, camek meyê noşîn da

Min noşî û serxweş bûm, (fil-ḧal)-i mişewweş bûm
Ez çar û neh û şeş bûm, min tekye bi balîn da

Herçî ku me ber pê kir, hindî me neẕer lê kir
Min seyr-i li êkê kir, lewra me dil û dîn da

Min dî hemî yek pertew sarî di meẕahir da
Mumkin hemî jê pur bûn, emma ne di temkîn da

Ew bû ku Zuleyxayê ê dîtî di Yûsif da
Mecnûnî di Leylayê, Ferhadî di Şêrîn da

Cana ji cemala te ez dê ku bibim šabir
Şeyxan û ulû'ezman canê xwe di kabîn da

Mišbaḧê ebed min dî îrohe di findê da
Genca ezelî merkûz min dî di gil û ṯîn da

Me'ḋûr e eger šûfî bit munkirê meḧbûban
Ger tê ku tešewwir kit sirra ku di dûrbîn da

Ma secde tenê min bir ber šûretê meḧbûban
Iblîsî nebir secde lew maye di nefrîn da

Şahid be tu ey zahid meḧbûbiperest im ez
Bê şahid û mey nabim Şeyxê me ev ayîn da

Canî ji te ey Xanî canan ku bixwazîtin
Ha nuqṯe li ber danî (fil-ḧal)-i di mizgîn da

**Ey Waḧidê penhan**

Ey waḧidê penhan ku ji đatê te ye peyda
Ev kewn û mekan, erḏ û sema, gunbedê xeḏra

Erwaḧ û ’uqûl, enfus û e’raḏ û cewahir
Xal in di muševwwer, ne meḧell û ne heyûla

Lewḧ û qelem û kursî û ’erş, encum û eflak
Hem agir û ax, av û hewa, cumleyê eşya

Sed qafile mewcûd-i peyapey mutewatir
Her leḧẕe ji šeḧrayê ’edem tên bi temenna

Hin neqdê fenayê diguhorin bi beqayê
Hin neqdê wicûda xwe dikin bê bedil efna

Her yek bi wicûda xwe wicûda te dixwazit
(Bil-cumle) xerîdarê cemala te ne, ḧeqqa

Lew şubhetî pîra bi hewes ṯalibê Yûsif
Dor hatiye (Xanî) kelefa rîsî di dest da

Ew jî bi meta’ê xwe qumaşê te dixwazit
(Subḧaneke len tuy°ise min rewḧike ’ebda)

Eĥmed ji ĥenaya te nedaket qe çu weŝfa

(Ma e’cezenî ĥemduke en eĥmede ĥemda)

## Ey ayîneyê dil

Ey ayîneyê dil bi cemala te mucella
Sed šefĥe bi yek ďerre ji nûra te mut̲ella

Insan te ji bo 'alemê kubra kire nusxe
Lew mud̲x̌eyekê jê tu dikî 'erşê mu'ella

Weĥdet bi ĥeseb kuĭretê e'yanê mez̲ahir
Her sû bi šifatan diketin keşfê tecella

Lew (muxteliful-qewl) û 'emel bûne xelaiq
Kafir ji šenem bûne bi navê te tesella

Sirra xwe nihanî te ku da Eĥmedê Xanî
(Ez x̌eyrî berî şud be, to awerd-i tewella)

## **Ji le'lêd-i yarê**

Ji le'lêd-i yarê emin mey vexwara
Bi dil min dibexşî Bedexşan Buxara

Mudamê di destê ẍeman da zebûn im
Mudamê dixom mey bikim ez mudara

Dema kirme ẍedra ewê gul'ed̆arê
Dibin bê tekelluf dilê min 'ed̆ara

Hinarî ji bo min der axûş-i pur dur
Hinarek di taze ḧebîba dilara

Ne yara te îro nez̠er da te (Xanî)
Ne yaran te mane, ne raḧet, ne yara

## Serwa me bi zerzeng

Serwa me bi zerzeng û hezar ’işwe û meş hat
’aşiq kirin eḧya li reqîban ku nexweş hat

Sunbul kemilandin gul û lale xemilandin
Reyḧan şetilandin li ruxan taze binefş hat

Ten derve nebû qeṯ nedida bextî guşadek
Rû da me şukir Ke’beyê ṯali’ ku duşeş hat

Tîpêd-i firengan bi ẍulû hatine romê
Şukrane nihane ji ’ereb hem ji ḧebeş hat

Reştozê xwe nûbar e meger goşe dixwazin
Tîra guşeyê da te hedef girt û bi keş hat

Yan hat û bi nîva dilî ket qeṯ nediwesṯa
Lewra ku ji ber qewsê me dî zêde bi weş hat

(Xanî) bes e bê ’arî çira zêdeyê salan
Îsal e jixwe ṯali’ û bextê te bi reş hat

**'işweyek da me seḧer**

'işweyek da me seḧer wê perîya ḧûrîsirişt
Şefeqa berqê cemalê dil û can suht û birişt

Me nezanî ku melek ya ne beşer ya ne perî
Yedê beyḏa weku Mûsayî li qetlê vedimişt

Bi temennaya şehadet 'aşiqan can bire pêş
Elleh Elleh çi ẍereḏdar e ku yek ferde nekuşt

(Ke'betul-lahî) cemalê me dikir çîne ṯewaf
Xeyberî hatine min xal û xeṯ û çenber û qişt

'ilmê esma° me ji ber kir di dibistanê šifat
Ṯalibê ḋatî me lew min şemmirand baẍê bihişt

Ademê kamil ez im bûyîme mescûdê melek
Mudde'î ger nebitin secde bi min ha serê xişt

(Xanîya) dê hebitin bê huneran laf û guzaf
Aferîn bo te ku ev şîwe ji bo kes te nehişt

## Mîrê meclis nekenit

Mîrê meclis nekenit mut̠ribê goya çi biket?
Ẍunce xendan nebitin, bulbulê şeyda çi biket?

Neynika ḧusnê putan lazim e šaḧib nez̠erek
Kesê bîna ku nebit dilberê zîba çi biket?

Bê kerem naçite tîba 'ediwan merdê şecî'
Tîẍê ahen çîte bê destê tuwana çi biket?

T̠alibê 'ilm û kemalê nebitin qabilê feyd̠
Ḧikmet û terbiyeta 'alimê dana çi biket?

Qelbê (Xanî) šedefa gewherê 'irfan e welê
Metnixwanek ku nebit šaḧibê me'na çi biket?

## Ey gülün perwerde-i gülzar-ı terawet!

Ey gülün perwerde-i gulzar-ı terawet!
Wey serweqedin sebze-i bustan-ı terawet
Wechin banadır minber û mihrab-ı ibadet
Zülfün xemi serhelqe-i zunnar-ı hidayet
İnsanı değildir bu tesewwur bu şerafet
Peh peh, bu ne şekl û ne şemail ne qiyafet!

Gülzar-ı İrem'dir cennet-i hüsn û cemalın
Cennet bağıdır aşıq-ı bustan-ı wisalın
Sewdazede qıldi beni fikr ile xeyal in
Enfs-u Mesiha gibidir feyz-i meqalın
Aşufte-i te'wiz-i cunûndur xet û xalın
Peh peh, bu ne şekl û ne şemail ne qiyafet!

Hecrin elemi can û dil e derd û beladır
Xak-ı qedemin gözlerime kıhl û celadır
Lütf ile eziz başın için bu ne enadır
Sayın başıma sal-i beqa zelil humadır
Billah-ı yüzün ayine-i nûr-i Xwedadır
Peh peh, bu ne şekl û ne şemail ne qiyafet!

Ey gamzesi qanler tukıçı lebleri xwînxwar
Wey kirpiki merdum yaqıçı gözleri xummar
Rehm ile eya padışahım kim bu dili zar
Çahı zeqının de niçe bir öyle giriftar
Hüsnün kör deli can û dilî eyledim isar
Peh peh, bu ne şekl û ne şemail ne qiyafet!

Reftar ile qeddin senema serwexeraman
Guftar ile cana dehenın durr-i derefşan
Ruxsar ile sen aleme xurşîd-i direxşan
Ağız ile leb kan-ı guher le'l-i Bedexşan
Bu wesf ile Xanî nice olmez sana qurban
Peh peh, bu ne şekl û ne şemail ne qiyafet!

**Ey dila ger te divêtin**

Ey dila ger te divêtin bibî daim mesrûr
Di ṯerebxaneyê dunya vexwe ava enigûr

Pê nebe ẍefletê ẍewẍayê cehanê bidirîn
Ji meqamê ku bi hiş tê ji šedayê ṯenibûr

Zimzima zemzemeya rahê Ḧuseynî ji Ḧicaz
Vedixûnit Ke'beyê dil ta bite (Beytul-Memûr)

Perdeyê ẕulmetê 'işqa li cehanê bidirîn
Ji neẕergahê cemalê tu ḧicabê bike dûr

Menẕerê dîdeyê canê te munewwer nebitin
Nešlê (ma zaẍe) nekêşî tu ji xal û xeṯê hûr

Gunehan ger nebuwa lezzet û ḋewqek haşa
Fa'il aẗim nedibû tarik û taib meicûr

Mey û me'şûq û hewesbazî û dunyayê zuhûr
Nebûwana nedibû ismekê (Ellah)î Ẍefûr

Min guneh tê bi gunahan ku di nêv baẍê cehan
T̈emerê xweştir ev in, bûn bi ḧeramî meşihûr

Hingî dewrê felekê saẍerê me dewr-i diket
Meh û salan digirit herwe ji ’umrê me quşûr

Rabe ey saqîyê mehweş tu ji reẍma felekê
Bide min badeyê le’lê tu ji cama feẍifûr

Şeyxê cam er nefesê hemdemê dil ket bê murad
Li muradê dilê murde dibitin keşfê qubûr

Ye’nî ew Xaneyê gil nabite qabil qeṯ’a
Ne bi çeşmê dilê naẕir ne bi rûyê meniẕûr

’işiqbazî du ṯerîq in çi ḧeqîqet çi mecaz
Şem’ê can dê bisujîtin çi bi nar û çi bi nûr

Şebê ẕulmatê bi imkanê dibit šuḧhê numa
Afitabê eḧediyyet ji feleq tête ẕuhûr

Ser û mal û dil û canê me fidayê te bitin
Bike qelbê me tu saqî ji şeraba xwe ṯehûr

Da bikem kesbê meqamat û ’ulûwê derecat
Ya bikem keşfê keramatê ji dara menišûr

Zahida ger te divêtin tu Xudê nas-i bikî
Were ber sayeyê şemşadiqedan qeṯ meçe dûr

Bi ziyarê were qeyda şecera Wadîyê Quds
Ku bizanî bibihî šîtê (Enellah)ê ji Ţûr

Ez lema şîfite û walihê meĥbûban im[1]
Ku di nêv ayîneyê cebhetê wan min dîye nûr

Her dema netrikê xilxalê binê têne xurûş
Her dema Ţûr e ji ber ţayê qešeb tête šudûr

Yane kakul ji kinarê kulehê keç biderîn
Ya xeţê miskê birêj ket ji kinarê kafiûr

Kafirê 'işq im eger ez nedemê îmanê
Ya bi miĥrabê birûyan nebirim secde ji dûr

Wa'iza guh bide min da bibihî neqlê šeĥîĥ
Mušĥefa çehreyê xûban e kitêba mesiţûr

Defterê 'işqê neda dest te mu'ellim ji ezel
Me'neya ayetê ĥusnê li te lew ma mesitûr

Bê tekelluf dixurim sûndê bi Qur'anê şerîf
Xanîya šûretê canan e bi min "sûreyê Nûr"

---

1 Ev nîvmalik şikestî ye.

**Dîsan dilê şeyda ji nû**

Dîsan dilê şeyda ji nû
Bê ixtiyar perwaz-i kir
Šeydek dîye û berdaye dû
Meyl û fira şehbaz-i kir

Meyla wî mehḏa ḧikmet e
Šeyda wî 'enqa sîret e
Ṯeyrê wî bala himmet e
Lewra ṯeleb evraz-i kir

'enqa bi dest kes nakevit
Damek divê ew dakevit
Nabit ku ẍafil rakevit
Ê qešdê šeyda baz-i kir

Šeyyadîya min bû 'ebes
Daim li min teng bû qefes
Raḧet nebûm ez yek nefes
Min lew bi efẍan saz-i kir

Saz û semaya šuḧbetê
Govend û çerxa de'wetê
Fikrîme şekl û qametê
Bîr têye min awaz-i kir

Şeklê mecazî çendek e
Šeyda ȟeqîqî werdek e
Teyẍûnê qeyda lê veke
Beȟrî me ber endaz-i kir

Nêçîr dibê teyẍûn bitin
Çendek li pêşber xûn bitin
Şunqar ne dê mecnûn bitin
Iskûf ji çavan baz-i kir

Şunqar e çav teyẍûn e dil
Berdane dû çavêt bikil
Xanî ewan gêra xecil
Lewra mecaz aẍaz-i kir

## Ez çûme derê meykedeyê

Ez çûme derê meykedeyê šubḧeyekê zû, min dî yeke esmer
Qamet bi meẗel şubhê çinarê û du gîsû, manendî du ejder

Çîn çîn kiribû bisk-i li ser gerdenê ruxsar, manendî du şehmar
Ker ker dixweşîn zulfê li ser qewsê du ebrû, manendî du şehper

Mayîm mutereqqib meger ew meẕherê i’caz, carek bi du sed naz
Ḧalê me tefeḧḧuš bike bêje ku esîro, ez bo te me xemxwer

Min gotî: Di weqtê seḧerê ew çi te da min, ey serwiqeda min
Gotî: Tu nizanî çi ye min da te feqîro, (e’ṯeytuke Kewẗer)

Ḧetta veke lewḧê šedef û xameyê yaqût, nêzîkî bi lahût
Min seyr-i kirin Sidre û Ṯûba qed û dilcû, nînin çu beraber

Hindî melek û ḧûr û perî bêne temaşa, (ḧaşa ẗumme ḧaşa)
Kengî dibin ew laiqî neẕẕareyê ebrû, ey dil meke bawer

Yarê ji derê meykedeyê min meke bê bar, ey seyyidê muxtar
Saqî ku tu yî (eşhedu-billahî) ku îro, Xanî bûye meyxwer

## Beydayê fena gerçi benim rehgüzerımdır

Beydayê fena gerçi benim rehgüzerımdır
'enqayê beqa himmet-i hemrahı perimdir

Wehm eylemezim sehm-i bila qews-i felekden
Etlesse çu destimde tewekkul siperimdir

Ben bax cihan içere 'eceb nexl-i belayım
Başimde bela, berg û meşeqqet semerimdir

Saqî! Bana imdad-ı qilûb fatıh-ı bab ol
Meyxane teriqinde ki ewwel seferimdir

Ben aşiq-i didarı ne hacet xem-i dîwar
Cennet dexî bir perde-i qet'i nezerimdir

Perwane-i pirsûxite-i şem'-i qedîmim
Nîran-ı cehennem şerer-i bal û perimdir

Alam û cefasiyle xoşım ben reh-i işqin
Xanî bana bu yolde qedem çeşm-i serimdir

## Šeydê çengala serê zulfa

Šeydê çengala serê zulfa şeha şehbaz im ez
Mestê cama ’işweya şehnazê nazik naz im ez

Remz û i’cazêd-i xûban bê ’ibaret medḧ dikem
Murşidê kamil ez im îrohe šaḧibraz im ez

Beyḏeya ez tê ’ebes bû aşiyana min qefes
Gerçi dil tê purhewes bû bê per û perwaz im ez

Vê ḧeyata ḧîretê çi bkem beqa nîne ji bo
Lew şehîdê ẍemzeya wê dilbera ṯennaz im ez

Derdemendek min divêtin hemnefes bit Xanîya
Ger me hemdestek hebîtin sazê xweşawaz im ez

## Her dinalim şev û rojan

Her dinalim şev û rojan meger Eyyûb im ez
Hêstiran her vedimalim meger Ye’qûb im ez

Bi kerem dest ji me berdin, kul û derdan yek in
Wer bipêçîn bi cefayê xwene mektûb im ez

Hindekê ẍem heye daim li min vêk dikevin
Ez nizanim ku bi çav wan xweyî meḧbûb im ez

Ẍem t̲elebkarê me ye, em t̲elebkarêd-i yar
We t̲ilisimê t̲elebê, t̲alib û met̲lûb im ez

’eceb iqbalî ji min nihe Xanî ku li bal
Padişahê ẍem û derdan-i weha merẍûb im ez

## Hêdî li ebrîşem bide

Hêdî li ebrîşem bide ey mutribê demsaz
Sed dil bi evîn bestine, her yek bi du sed naz

Ey badê šeba pur mehejîn turreyê dildar
'uşşaqê binalîne ji ber ẍulle û şehnaz

Saqî bigerîn badeyê engûr-i bi tenbûr
Cana bide min bûseyekê herwe bi dilxwaz

Rûḧa min û sirra di ruxê yarê bi yek ra
Roja ezelî bûne bi dil hemdem û hemraz

Xanî te ẍelet zanîye ew her jixwe yek bûn
Xellaqî te'eddud bi mezahir kire i'caz

## Ez çûme baẍê sorgulan

Ez çûme baẍê sorgulan
Weqtê seḧergahê bi xef
Min dî šedaya bulbulan
Dagirtibûn her çar ṯeref

Šewta hezar û qumrîyan
Dengê rebab û muẍnîyan
Teşbîhî bezma bengîyan
Hevdengî hev bûn çeng û def

Manendî mest û serxweşan
Ez çûme bezma mehweşan
Ebrûkeman û çavreşan
Cerg û dilê min kir hedef

Peygan di cergî dilperî
Sing bûye šindûqa berî
Šeddeq ji ḧusna te perî
Hêja li min kir kerb û gef

Hêja li min bû kerb û kîn
Ẕahir ẍeḏeb baṯin kenîn
Lê ẍemzeyek da min nihîn
'eqlê me dîsan bir telef

Dîsan ḧebîba çavbelek
Iḧsan di gel me bûn gelek
Lewra di gel zulfên xelek
Aloz me dîtin qişt û lef

Şitrî û qişt û zulf û xal
Hemyan li ser ruxsarê al
Vêkra hebûn ceng û cidal
Lêk alîya bûn šef bi šef

Šef šef me dî wê kirye ceng
Hindek ḧebeş hindek fereng
Vêkra birandin wek xedeng
Vêkra hebûn wan laf û lef

Vêkra hebûn de'wa û şer
Derbûn li min tîpa teter
Jêk rakirin qelb û ceger
Rihtin ji dil xûna bikef

Rihtin ji dil xûna dilan
Şehmar û zulfê ser milan
Bê reḧm û mest û qatilan
Mey xwar ji fincana šedef

Wan meyxuran ebter kirîn

Bêquwwet û rengzer kirîn

Wellah ji dil ker ker kirîn

Xanî bes e ah û esef

## Ey dil eger bi neqdê can

Ey dil eger bi neqdê can
Cinsê giran bihayê zulf
Dê bikirî bizan mecan
Cewherê canfidayê zulf

Her serê mû bi sazekî
Cilwe diket bi nazekî
'aşiqê 'işiqbazekî
Bende diket bi layê zulf

Rom û fireng û hindîyan
Xal û nişan û xemrîyan
Xencer û şîr û mišrîyan
Ceng e li ber liwayê zulf

Tac û tumar û binperan
Le'il û guhar û gewheran
Serxweş û dîn û ebteran
Ḋewq e di gel semayê zulf

Law û rewal û rîspîyan
Mîr û wezîr û cindîyan
Serxweş û mest û bengîyan
Derd e ji macerayê zulf

Şeyx û murîd û salikan
Şah û feqîr û malikan
Çust û çeleng û çapukan
Dil kete bende payê zulf

Ef'a û mar û ejdera
Misk û zubad û 'enbera
Nefxeyê rûḧiperwera
Raiḧeyê hewayê zulf

Bê mey û bê dewayekî
Bê def û çeng û nayekî
Dîn diketin melayekî
Ceďbeyê dilrubayê zulf

Mîr û mela û mahiran
Çendî belîẍ û şa'iran
Xanî û hindî ḧaḏiran
Derd e ji destê ṯayê zulf

## Ey dilê! Qelb-i nahejî

Ey dilê! Qelb-i nahejî yek serê mû ji t̲ayê zulf
Ger nehejî tu pêlekê, şubhetî min li bayê zulf

Xûn û dil û ceger dixûn, nafefiroş-i her seḧer
Badê šeba ku têk bidet, sunbulê mişkisayê zulf

Ẍunçeyê teng-i ḧewšil e, dil ji rikan bi girt dibî
Šubḧegehan ku ser diket, lexlexeyê hewayê zulf

Meşqê diket ti mekteban, rûyê nigar û ḧusnê xet̲
Bende hezar û t̲iflê dil, hatine ber melayê zulf

'aşiqê bêceger meger, šebrê ji can û dil diket
Mani'ê genc-i meqšed e, heybetê ejdehayê zulf

T̲alibê nûrê ẍeyb im ez, mame di qeyd û z̲ulmetê
Hîvî Xuda û himmet e, ḧad̲irê ewliyayê zulf

Beḧrê cemalê yar eger keştîyê tê šebrê bikit
Destê min û te'elluqa damenê ba Xudayê zulf

T̲ali' û bext eger me dî, dewletê sermedî me dî
Dil ku xwe daye ber siha, çeng û perê hewayê zulf

Xanîyê jar û bênewa, lê dicivin wiha sitem

Lew direvî ji dergeha şêr û şeha newayê zulf

## Ji derdê ’işqê bedḧal im

Ji derdê ’işqê bedḧal im
’eceb pur bûye min narek
Were cana bibîn ḧal im
Ne min dil ma, ne dildarek

Ne dildar û ne min dil man
Ne alal û ne sorgul man
Ne reyḧan û ne sunbul man
Di dil da min xelî xarek

Di dil da min xelî peygan
Were ser min bike iḧsan
Li gorahî reqîbî man
Bibîn xweş bû birîndarek

Vede destan ḧebîba min
Bike derman t̠ebîba min
Bike derman birîna min
Bi dest û tillê mûbarek

Birîndaran birîn xweş bûn
Reqîban herdu rûreş bûn
Di baẍê ḧusnê gul geş bûn
Nekêşit bulbul azarek

Seḧer bulbul bihawar e
Di dil da ew birîndar e
Kul û nalîn ji bo ’ar e
Ne gul mane ne gulnarek

Nekêşit bulbul azarê
Li reẍma muḧbeta xarê
Li fešla mahê azarê
Nemînit qeṯ li dil barek

Li dil barê ẍeman bar e
Ne nîsan e ne azar e
Hero Xanî bihawar e
Di destî maye guftarek

## Fate ’umrî fî hewake

Fate ’umrî fî hewake ya ĥebîbî kulle ĥal
Ah û nalim hemdemem şud der firaqit mah û sal[1]
Ger benim kanım dilersen çoktan olmuştur halal
Mest û serxoş im ji ’işqê min nema ’eql û kemal

Ente fikrî fî fuadî ente rûĥî fil-cesed
Leşkerê xemhayi to milkê dilim wêran-i kerd
Dade geldim işk elinden isterim senden meded
Van tetaran kirne talan ’eql û dîn û milk û mal

Ṯale ẍemmî zade hemmî şa’e sirrî fil-mela
Teşneyê cama wišalim çun şehîdê Kerbela
Yoksesin diwane oldun nice halın ey dila
Yan ji nû ve ’işweyek da min ĥebîba çavẍezal

Bittû hicranen ĥebîbî leste minnî ’alîmen
Merdum ez derdê firaqit ẍafilî ez ĥalî min
Can û dilden erz-i kaldım halımı canane ben
’erḏeĥala min tu ẍafil qeṯ nepirsî ’erḏeĥal

1 Di nusxeyeka din wiha hatiye:
Leyse fî qelbî sîwake ya ĥebîbî kulle ĥal
Her demem ẍem hemdemem şud der firaqit mah û sal

Hel lena min ni'metil-wešlî ḧebîbî min nešîb
Ûfitadem ber derit bî çare sergerdan ẍerîb
Derdimiz çok olduğundan ona yoktur hiç tebib
Ey t̲ebîbê min, dewayê derdê Xanî her wišal

**Şîweyê ’işwe û nazêd-i ku dildar-i dikin**

Şîweyê ’işwe û nazêd-i ku dildar-i dikin
’aşiqan bo çi gelo hinde qeder har-i dikin

Gul di gel bulbulî xweşteb’e û xendane welê
Bê wefayî û cefaya ku dikin xar-i dikin

Hûn mekin lewme ji šaḧibkereman ey çendîno
Ku çiranî em û ew bîzere w bêzar-i dikin

Wan divêtin hemî kes zêde ji wan razî bitin
Lê rûz bi teles hindekan sar-i dikin[1]

Dilberan ger nevya ’aşiq û şeyda pur bitin
Bo çira zînet û xemlê li xwe ew bar-i dikin

Ruḧê ’aşiq rûyê me’şûq-i bi ser mutteḧid in
Mute’edid ’eredê cewher-i inkar-i dikin

’izzet û rûmetîdan cumle ji bal Baxuyî ne
Da bizanî tu ku ne şah û ne xundkar-i dikin

Wacib û lazim e daim li me ketma emelê
’arif û ’aqil û dana jixwe inkar-i dikin

1 Ev nîvmalik şikestî ye.

Ne wekî Xanî ye nadan negihiştî-yi avê
Peleka hildiditin ya di dil iz̲har-i dikin

## **Îro li textê dilberê**

Îro li textê dilberê
Ya Reb çi şêrîn esmer e
Jê nabitin min dilberê
Ew dilber e ya dil ber e

Dil bû ku birya can e ew
Dîn bû we ya îman e ew
Hem luṯf e hem iḧsan e ew
Hem law e hem gerdenzer e

Kakul ji ber tacê bizer
Ṯa ṯa wekî pur bêne der
Ser'eskerê tîpa teter
Serdar e ya ne serwer e

Ya Reb ḧebîba rengfeleq
Corê teteq dagirt şefeq
Ya belkê nûr e ya wereq
Ya qişt e ya ne çenber e

Zulf in gelo pur pêç û xem
Ya sunbula Baẍê Îrem
Zincîr e ya ser ta qedem
Reşmar e ya ne ejder e

Ew ṯurre ya gîsû ne ew
Zencî ne yan hindû ne ew
Şutrî ne ya şebbû ne ew
Yan toẍ û şahê Sencer e

Ebrû ne ya meh bû hilal
Hindû ne ya nîşan û xal
Gîsû ne ya ḧeḏret Bilal
Meşẍûlê Ellah-ekber e

Çav in gelo ya serxweş in
Ya kafir in ya dilreş in
Bîmar in ew ya nexweş in
Ya nergis e cadûger e

Ruxsar e ya Reb ya qemer
Guftar e ya Reb ya guher
Ew qeyd e ya Reb ya xeber
Ew şehd e ya ne şekker e

Rû ne gelo ya werdê al
Alal e yan dêma bixal
Qendîlê nûra (Ḋul-celal)
Mir˚at e ya na meẕher e

Dêm şûşe, nûra ḧeq di nav
Dev ẍunçeya şêrîngulav
Rux werdê gul rengînxunav
Xal, bisk û nîşan ’enber e

Lêv in gelo ya qûtê can?
Yaqût e ya qûtê rewan
Yan qotîya durca durran
Yan ḧewḏ e ya ne Kewẗer e

Ya Reb xeṯê reyḧanî ye
Ser sûreyê Qur˚anî ye
Yan xatema sulṯanî ye
Ferman e ya ne defter e

Xal in gelo ya fulful in?
Ew ’ariḏ in yan sorgul in
Em ’aşiq in yan bulbul in
Ḋikrê me werda eḧmer e

Ew gerdena şubhî şemal
Serçeşmeya ava zelal
Qarûre ya xemra ḧelal
Ya şûşe ye ya şekker e

Ya reb qeda zîba ye ev
Yan Ke'beya 'ulya ye ev
Yan (Mescidul-Eqša) ye ev
Yan Sidre ya ne 'er'er e

Ya reb dilê dîwane ye
Ya 'aqilê ferzane ye
Yan bulbulê wêrane ye
Yan 'ûd e ya ne mecmer e

Ew Xanîyê dildade ye
Meşreb ji beng û bade ye
Derdê wî yarek sade ye
Lew her de'îf û rengzer e

**Mi dî şeyxek**

Mi dî şeyxek ji şeyxê neqşebendan
Vebûn bendêd-i min yek yek ji bendan

Guşada dil ji bo min ra muyesser
Nebû bê šuḧbeta šûretlewendan

Dilê me bû di gel ẍewẍayeyê derd
Hejand şûr û li ser me hat bi rindan

Li min kurt bû riya Ke'ba wišalê
Ji şekl û qameta balabilindan

Ez îro serxweş im wellahî wa'iẕ
Li min ḏayi' meke van we'ẕ û pendan

Kesê girya bibit belkî bi 'işqê
Dibîtin 'aqibet elbet bi xendan

Me sed hîvî heye dîsan ji šeyyad
Me aza ket ji qeydê qeyd û bendan

Ji ahoyan me yaho xweste emma
Dilê min ma di nêv muşkînkemendan

Heçî pîlek di ’işqê da ’emel kir
Dibîtin ’aqibet şadan û xendan

Dilê Xanî eger bû gencexan e
Belê qet kes nego Xanî bi çendan

**Da z̲en nebirin**

Da z̲en nebirin ku em xemoş în
Em bestedehan û pur xuroş în

Genca me di dil guher tijî ne
Herçende 'eyan xezeffiroş în

Şahîn û bi xef me libse dîba
Z̲ahir jixwe em pelasîpoş în

Micmeršifet e me cism û can'ûd
Dil ateş e daima bicoş în

Meyxane bihişt e ḧûr e saqî
Kewẗer mey e lew ve badenoş în

Bîhode ye lave lew ku Xanî
Dunyager û axiretfiroş în

## Durdane ji dev da me dibarin

Durdane ji dev da me dibarin dem û satan
Kes nîne bibet wan bifiroşit li welatan

Sewdagerê 'işqê perîyan cumle dirêtin
Qeṯ'a û še'alîkê zemanê feteratan

Qeṯ gewherekî cewherîyek nîne biha ket
Bazarê cihan maye bi van turkmen û tatan

'ebdê ḋeheb in hindek û hind 'abidê fiḏḏe
'aşiq deriya niye ji 'îd û 'erefatan

Me'şûq e cemadat-i û 'aşiq bi xwe ḧeywan
Insan biriyane çi xeber dem ji nebatan

Kuffarî bû dem daye ḧišarê û me xundkar
Hêj wê li şikarê digerîtin li felatan

Beglerbegî û mîr û wezîr cumleyê pur tên
Kuffarî û xundkarî xeḏeb kir li furatan

Islamî li cengê tu mebê bo çî zebûn e
Lerwa ku kerem nîne ḧumata kelîmatan

Rûdaye 'imaratê mulûkan-i bi israf
Mîrê pisîyan nadete xelqê xwe xelatan

Mîrêt Mehmedanî xwe dubendî ne di xain
'Îsê ne li Mûsayî dixûnin šelewatan

Xelqê me Hekarî we dibîtin ku ji bo şah
Ḧîna seferan ew dişehînin edewatan

Mêrê nemiran wê dimirîtin ji feqîrî
Şêrwan û Mukis bûyîne muḧtacî zekatan

Ya Reb tu biparêze di vê 'ešrê qizilbaş
Ṯuẍyan û xurûcê neken ew bêne welatan

Kî dê li vê Serḧeddê ji pêş wan ve biwestit
Kes nîne ku têr nanî bidet pênc-i ẍuzatan

Ya Reb bi du'ayê Nebîyî û welîyan key
B`Incîl û Zebûr û Furuqan û Tewiratan

Ya Reb bi Mekê key bi Medînê bi ṯewafê
Ya Reb bi ḧeqê se'î û wiqûf û 'erefatan

Ya Rebbî bi lewḧ û qelem û kursî û 'erşan
Ya Reb tu bi mulk û melekût û semewatan

Ya Reb tu bi tewĥîd û bi tesbîĥ û bi đikran
Ya Reb bi du'a û bi šelat û šelewatan

Xundkarî li kuffarî muzeffer bike dîsa
Da şah-i ji tirsan li 'Umer det šelewatan

Naqûs û šelîbêd-i ferengan çi rewan e
Ew bên bigirin cumle cihê bang û šelatan

Çendîn di ricalan bişehîne tu ji ẍeybê
Îsal e seferkêş bide xelqê xelewatan

Pa malê ḏelal bête di nav ĥozeyê islam
Qeṯ laiq e ey xaliqê nûr û ẕulumatan

Xelqê bedewan gerçi mirin çûne beĥeştê
Ĥeyfa me li ibnan û xewatîn û benatan

Murted bibin ew cumle bimînin di giriftar
Terka te biden ew biperistin but û latan

Ev çende tefasîr û mešaĥif bi telif çûn
Ĥurmet çu nema ayet û ĥerf û kelîmatan

Ey me'şerê islamê hemî šalih û ṯaliĥ
Wey 'adil û fasiq jî bixwazin de'ewatan

Her kes bi qeder ḧalî biken kesb û teqerrub
B`išlaḧê nufûsan dibitin wešl û liqatan

Da munteqimê Qadirê Qeyyûm-i vexwazit
Dada me ji kuffar û ji fuccar û buẍatan

Hindî diketin Xanîyê bêçare gunahan
Ya Reb tu bedel wan binivîse ḧesenatan

## Şînname

*Der ḧeqê Muḧemmed Begê hakimê Bazîdê da*

Kanê Muḧemmed Beg gelo?
Kan padişahê Serḧedan?
Îro ji dil bigrîn de lo
Kan padişahê Serḧedan

Îro bibînin 'ibretê
Aẍa û xelqê Hêşetê
Kanê xudanê ẍîretê
Kan padişahê Serḧedan?

Mîrê di nêv mîran binav
Eşheb siwarê rimzirav
Bala bilindê perbelav
Kan padişahê Serḧedan?

Kê dî we reng ďatek şerîf
Erkan û ezmanek leṯîf
'alem di dest wî bû ḏe'îf
Kan padişahê Serḧedan?

Koma dimil bû sê hezar
Sed mîrekan vêkra ducar
Jêk rakirin kir tar û mar
Kan padişahê Serḧedan?

Senceq ji ser Qersê birrî
Bidlîsîyan wan jê kirrî
Xanê dimil kirbû çirrî
Kan padişahê Serḧedan?

Kanê ’ezîzê mišrîyan
Kanê ’edûwê wanîyan
Kan hevrikê meḧmûdîyan
Kan padişahê Serḧedan?

Kanê emîrê namidar
Serḧednişînê xundikar
Paşan ji bo pêşkêş hinar
Kan padişahê Serḧedan?

Kanê emîrê (ḋul-finûn)
Kan ’aqilê ṯeb’etcunûn
’alem li ber wî bûn zebûn
Kan padişahê Serḧedan?

D`ilmê xwe ew ’ellame bû
Behramê gulgûncame bû
Qettalê pur hingame bû
Kan padişahê Serḧedan?

Çend mîr û ḧakim rakirin

Çend xan û sulṯan dakirin

Kom û ḧeşem berba kirin

Kan padişahê Serḧedan?

Ew ḧakimê pur nav û deng

Hemṯeb'etê Teymûrê leng

De'we dikir biçme fereng

Kan padişahê Serḧedan?

Pêla ku wî dîwan digirt

Xelqê edeb erkan digirt

Heybet ji wan dîwan digirt

Kan padişahê Serḧedan?

Weqtê bi ser hespê dike

Şeş caniban rev pê diket

Heybet bi ser xelqê diket

Kan padişahê Serḧedan?

Daim 'edalet pîşe bû

Ẍayet deqîq endîşe bû

Nazik ṯebî'et şîşe bû

Kan padişahê Serḧedan?

Dîwan û ’edil û dadigîr

Iď’an pur û rewşen ḏemîr

Ḧetta xweş în nakin ji bîr

Kan padişahê Serḧedan?

Dîwan û eywan şanişîn

Ew šedr û ḧewḏêd nazenîn

Man şubhî firdewsê berîn

Kan padişahê Serḧedan?

Ferşêd-i dîba û ḧerîr

Istebreqêt wî bêneẕîr

Bê ixtiyar mayîn ji mîr

Kan padişahê Serḧedan?

Ev ẍaliyet ermûş û qez

Wernagirt kes şubhî xez

Xalî bûyîn meydan û rez

Kan padişahê Serḧedan?

Rez bû miẗala cennetê

Eywan ji šun’ê qudretê

Kes nîne tê ket şubhetê

Kan padişahê Serḧedan?

Elmas û le'l û gewheran
Tomar û tac û binperan
Ḧed nîne bêxme defteran
Kan padişahê Serḧedan?

Sed me'nek û hespêd bedew
Šafî ḧudûd zêrîn celew
Kes nîne wan raket ji xew
Kan padişahê Serḧedan?

Ew şehnişîn û ḧewḏ û av
Nêçîrgehê pur šeyd û rav
Nabit bibêjim ez bi nav
Kan padişahê Serḧedan?

Şahinşehê gerdenfiraz
Aza kirin teyhûn û qaz
Terxan kirin teyẍûn û baz
Kan padişahê Serḧedan?

Mîrê me wê nabit siwar
Têr bûye ew naçit şikar
Teyẍûn û terlan man li xwar
Kan padişahê Serḧedan?

Serdarîya koma gelek
Nakit siwarê çavbelek
Çavet sipî bin ey felek!
Kan padişahê Serḧedan?

Ṯaq û rewaq û menẕeran
Koşk û xelat û xeyberan
Wan cumle nîşan ḧeyderan
Kan padişahê Serḧedan?

Ew cumle wî îcad kirin
Herçend qewî binyad kirin
Çerxî hejand berbad kirin
Kan padişahê Serḧedan?

Xwahê kelatan bi ẕefer
Dujmin ji ber wî bê mefer
Wê çûye nîva ax û ber
Kan padişahê Serḧedan?

Dunya diborîtin bi dor
'umrê 'ezîz nadin bi zor
Dewlet dibên naçîte gor
Kan padişahê Serḧedan?

Ya Reb hebit ocax qedîm
'emmêd-i wî xweş bin 'emîm
(Bil-xašše) ew durra yetîm
Kan padişahê Serḧedan?

Durdaneyê gewheršedef
Ew ma ji wî neslî xelef
Ya Reb nekî wan zû telef
Kan padişahê Serḧedan?

Xelqê xudanê dewletê
Wê çûye mala ẕulmetê
B`wî ra bixûnin reḧmetê
Kan padişahê Serḧedan?

Xanî tu jî destan hilîn
Herçend ku zêde dilkul în
Îro ji bo mîr sail în
Kan padişahê Serḧedan?

## Ger gunehkar în

Ger gunehkar în ji bo ismê Ẍefûr em mez̲her în
Wer sitemkar în temaşagahê ehlê meḧşer în

Pur gunahan ger tu dê mehder bikî (Yewmul-ḧisab)
(Ey şefî'ul mud̈nibîn) em bo te ra serdefter în

Ger Ẍefûrî em nebexşîn û şefî'î em nedîn
Kar û barê me ke malik bo te ra ser'esker în

Dozex û cennet li nik me herdu yeksan in bi ḧal
'aşiqê dîdarê yar în perwerê pêẍember în

Ger cemala bêzewal em dê nebînîn bê ḧicab
Dar û dîwarêd-i Rid̲wan Xanî em pê kû b`kerîn?

## Zahidê xelwetnişîn

Zahidê xelwetnişîn pabestê kirdarê xwe ye
Tacirê riĥletguzîn dildarê dînarê xwe ye
'aşiqê dilberĥebîn dildayê dildarê xwe ye
Da bizanî her kesek bê şubhe ẍemxwarê xwe ye

Bê 'emel tu j`kes meke hîvî 'e<u>t</u>a° û himmetê
Bê ẍere<u>d</u> nakêşitin qe<u>t</u> kes ji bo kes zeĥmetê
Kes nehin qe<u>t</u> hilgirit barê te ew bê ucretê
Gerçi 'Îsa bit ewî fikra ker û barê xwe ye

Hoşiyar bî! Da nekî 'umrê xwe bê ĥašil telef
Lew ku nadet fayide mal, genc û ewlad û xelef
Maceraya Xi<u>d</u>r û dîwarê yetîmî bû selef
Vî zemanî her kesek mi'marê dîwarê xwe ye

Ca ne<u>z</u>er ke tu bi pêla ku we waqi' bit sewaş
Ger nebîtin iltifat û mûçe û debr û me'aş
Cindîyê rimbazê faris nadetin canî belaş
Sa'eta serbazîyê hîvî ji serdarê xwe ye

Xanîya <u>d</u>ai' nekey 'umrê xwe, ey nadan, 'ebes
Bê <u>t</u>eleb nabî ji wešlê behremend ey bul-hewes
Šani'ê mu<u>t</u>leq ku nîne iĥtiyacek wî bi kes
Lu<u>t</u>f û iĥsan jî ewî der ĥeq <u>t</u>elebkarê xwe ye

## Dila qet̠ nîne meȟbûbek

Dila qet̠ nîne meȟbûbek
Ji te cuz˚ek nebit lalî
Dilarama ne mecḋûbek
Heye sirra te jê xalî

Eger sirra di qelban e
We ger nûra di wechan e
Bi min yekreng û yekt̠a ne
Di gel yek bûn li wî alî

Ji ẍeybê ew bi yek hatin
Hemî cot in, ne tek hatin
Wekî çavêt belek hatin
Bi hev ket şahî û t̠alî

Eger ȟusn e eger nûr e
Eger nêzîk eger dûr e
Birîna 'aşiqan kûr e
Ji sertîra kurê Zalî

Ji sertîra mucewher bû
Çi awir bû çi xencer bû
Ji bo min ra muqedder bû
Dema pif kirne šelšalî

We ger šelšal û fexxar im
Tijî nûr im tijî nar im
Di bat̲in şubhî xunkar im
Bi z̲ahir ketme wî şalî

Gelek şal, cewher û zîba
Gelek et̲les, gelek dîba
Gelek sîm û gelek şîba
Me havêtin cîger nalî

Cîger nalî me havêtin
Hemî yek yek hilavêtin
Gelo kî bit ku navêtin
Ḧebîbek çaridesalî

Meger her min divê dilber
Du sed ’ilman bikem ezber
Ji xilxalan dibit ebter
Mela meqšûdê xilxalî

Mela meqšûdê min xal e
Ne milk û menzil û mal e
Ne ’ilmê qale ew ḧal e
Me ḧašil kir bi ’ebdalî

Me ḧaşil kir bi xîzanî
Bi muştaqî û ḧeyranî
Wekî genca di wêranî
Me peyda kir bi remmalî

Bi remmalî me peyda kir
Dilê ẍemgîn me pê şa kir
(Neqîyul-xed) me aza kir
Wekî pîra dusedsalî

(Neqîyul-xed) û liḧyan in
Berat û emr û ferman in
Bi ṯuẍra° û bi nîşan in
Di dest 'uşşaqê dellalî

Di dest dellalî da min dî
Ruxê kaẍid semerqendî
Xeṯê kûfî nuqeṯ hindî
Kitaba ḧusn û eşkalî

Kitaba ḧusn û dilber bû
Xeṯê (Ellahu-ekber) bû
Melayî go ji ezber bû
Li textê dil dibit walî

Li textê qelbî sul̲tan e
Dilê wî ’erşê Reȟman e
Wekî Xanî ne nadan e
Dizanit ew bi eȟwalî

Bi eȟwalî xeberdar e
Bi šûret şeklê dildar e
Di ba̲tin ’eynî dîdar e
(Te’ala şe°nuhul ’alî)

## Dilo rabe xwe dilxweş ke

Dilo rabe xwe dilxweş ke
Hilo da b`çîne seyranê
Were carek tu xwe b`weş ke
Biçîn seyra gulistanê

Gulistana ku sorgul tê
Semen nesrîn û sunbul tê
Hezar bulbul bi ẍulẍul tê
Di fešla mahê nîsanê

Di fešla caduwî nîsan
Me dîbû dilberek dîsan
Bi dil meş'el çira îsan
Me can da şubhî perwanê

Me can da dilberek sade
Leṯîf û şox û begzade
Ji qeydan kirme azade
Nihan xwendîme dîwanê

Nihanî xelwetek da min
Ji le'lan şerbetek da min
Bi wešlê šuḧbetek da min
Kirim bende di fermanê

Di fermanê kî šadiq bit
Û naxwazî munafiq bit
Divê her dem miwafiq bit
Wekî Şeyxê di Šen'anê

Wekî şeyxî di hadir bit
Di fermanê de nazir bit
Bi emrê dostê kafir bit
Bisojî šuḧfê Qur°anê

Disojim šuḧfê mektûbe
Bi emrê yar û meḧbûbe
Dema dil dem bi metlûbe
Didem ez dîn û îmanê

Eger dilber mecazî bit
Ji rengê libsê ẍazî bit
Bila šûfî nerazî bit
Bimîne ew di ḧirmanê

Binê šûfî qewî dîn e
Wekî xeffaşê miskîn e
Li nik wî roj tu reng nîne
Çu nabînit ji 'umyanê

Dilê wî kor e, e'ma ye
Ji wešlê dûrê dama ye
Li ber wî derge dadaye
Nehişte bête dîwanê

Di dîwana ku qerqef tê
Bi bezma her ney û def tê
Melaik sed hezar šef tê
Ez im yê hatî meydanê

Ez im serxweş ji wê camê
Ez im sewda di nêv 'amê
Ez im 'enqa ketî damê
Bi zulfa ser li xal danî

Bi zulfa hatî ser xalan
Binfeşa tîtik û alan
Dil û canê me 'ebdalan
Dibit dîsa bi talanê

Di talana ku sed ser çûn
Hezaran genc û gewher çûn
Dilê sed par e ker ker çûn
Tu Xanî bes ke efẍanê

## Hero sed car ji ulfa wê

Hero sed car ji ulfa wê
Dibim keyfê li meyxanê
Vebîr min tête zulfa wê
Dinalim ez ji hicranê

Ji sehma ’eqreb û maran
Dinalim ez gelî yaran
Ji çehvan xûn diçît baran
Wekî ew têne lêkdanê

Wekî ew têne ser balan
Bibînin nuqṯe û xalan
Binefş û terḧê alalan
Di ser da mahê tabanê

Di ser da ew meha enwer
Ji reyḧan sunbulan da ser
Kirim sewda û hem ebter
Ji min dil bir bi talanê

Ji min dil bir evê carê
Ku min dî qameta yarê
Wekî selwê li cobarê
Vemeşya hate eywanê

Vemeşya ya šifetḧûrî
Ji rengê sorgula jorî
Riḧê şêrîn dikem gorî
Ji bo xalê û nîşanê

Ji wan xalan tecellê da
’Eṯarud bû di burcê da
Dilê min gêzmeyek lê da
Bi şîr ew hate meydanê

Bi şîr hat ew perîpeyker
Şevîmaha tijî enwer
Li min da baṯinî xencer
Dinalim ez ji êşanê

Ji wî derbî yê gêj im ez
Şubî bilbil dibêjim ez
Ji çehvan xûn dirêjim ez
Wekî ṯavêd-i baranê

Ji çehvan xwîn dibarînim
Ji ’işqa te ez ê dîn im
Şubî Ferhad û Mecnwîn im
Dibêm: Leyla gelo kanê?

Xerîb im ez ji Leylayê
Nehin wek te li dunyayê
Biçîte bîte zîbayê
Ku ’aşiq wê di zîndanê

Ku ’aşiq wê dinalîtin
Şev û rojan dikalîtin
Ji çehvan xûn dimalîtin
Mecal e bête zozanê

Mecal e me nekir karek
Li surme wê hebû marek
Verêkem ayetê carek
Di gel bayê şebistanê

Di gel bayê seḧerxêzê
Bibêje ’enberamêzê
Te ’aşiq kuşt bi vê rêzê
Bike lut̠fê û iḧsanê

Ku min dîbû li ser banî
Dibêjit: Eḧmedê Xanî
Bide rûḧê di gel canî
Dibêjim ez: Bigir, Hanê!

**Ey derîẍa mame tenha**

Ey derîẍa mame tenha ez ji şemsa xawerê
Xan û man têk bûne zulmet paşî wê dêm enwerê
Bêqerar im şubhî zîbeq bê ewê sîmenberê
Paşî lêvêt wê venaxwim mutleq ava Kewẗerê

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Sed mixabin çû ji bal min ew ḧebîba çavbelek
Ah û efẍan im şev û rojan tiçin ḧetta felek
Wê ji feryadêd-i min 'aciz dibin ins û melek
Mam di qeyda daẍ û derdan paşî wan zulfêt xelek

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Hicreta yarê bihatim şubhî finda şu'ledar
Ketme ḧalê iftiraqê j`iḧtiraqê bûme nar
Ew wucûda bê wucûd e suht û têkda bû ẍubar
Min nevê dunya bi carek paşî wan çavêt xumar

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Ger di ḧîna ez wefa bim bête ser min 'izreîl
Mujdeya xuldê di wê gavê bidet min Cibreîl
Xid̠rê Ferrux bê ji min ra ew di wê rê da delîl
Dê bibêjim min nevêtin xuld û Kewẗer selsebîl

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Çerxê keç reftar e wa weyla! Ku ez ḧeyran kirim
Serbigerdan bûm welêkin zêde sergerdan kirim
Bê dil û 'eql û hewes carek ku bê id̈'an kirim
Zêde vê bêmirwetê ev reng ku ez talan kirim

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Zînihar ey dositan weqtê bikem ez hicretê
Van du mišra'an kitabet kin li bergê kaẍetê
Da di dest min da sened bit ew di beyta axretê
'erd̠uḧalê min bibit med̠mûn ji ḧîna ḧed̠retê

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

Xanîya ev herze goyî we xeṯa û ne šewab
Xêr ji te šadir bibin ey bêedeb ey bêḧicab
Ev qeḏa ya Barî ye, raḏî bibe ey malxirab
Belkî bîte mûcibê narî ji bo te ev cewab

Ger bizanim ez di ḧeşrê da nebînim dilberê
Dê çi lê kem cennetê pê wer bikem xakisterê

## Ey seyyidê ‘alem

Ey seyyidê ‘alem, senedê nûra hidayet
Serdarê şefî’an ku tu der rozê qiyamet
Hîvî dikin em vê ji te ey šedrê risalet
Merḧûm-i nekî me tu ji dîwana şefa‘et

Qed kane leke-l-fed̲l leke-l-cûdû keẗîra
Ursilte îlel-xelqî beşîren we ned̈îra

T̲aha, tu resûlê melikê mulkê kerîm î
Teşrîf-i bi ne’leynê xwe ser ‘erşê ‘ez̲îm î
Der beḧrê cemelê tu tenê durra yetîm î
Eḧsentir î ez Yûsuf û Siddîq û Ḧelîm î

Ey ne’tê te ez ferş-i ḧeta ‘erş-i şehîra
Ursilte îlel-xelqî beşîren we ned̈îra